# LÊKOLÎNÊN AKADEMÎK
## ÊN KURDOLOJÎYÊ I



Edîtor: Osman Aslanoğlu - Tahirhan Aydın

Ahmet KANİ - Ayetullah ÇELİK - Deniz GÜNDÜZ - Fahri TİTİZ
Mehmet Salih KARAASLAN - Murat BAŞARAN - Murat İŞÇİ
Osman ASLANOĞLU - Seyed Mazhar EBRAHIMI
Sinan GÜLTEKİN - Tahirhan AYDIN - Vehbi TUNÇ

Şarkiyat
BİLİM VE HİKMET VAKFI YAYINLARI

## Naverok

## Pêşgotin

Akademîya Kurdî her roj bi xebatên mezintir û bi rêk û pêktir derdikeve meydanê. Carinan rû bi rû bi bernameyên wek sempozyûm û seminer, carinan jî bi xebatên nivîskî xwe nişan dide. Berhemên bernameyên wek sempozyûm û seminer jî piştî van çalakîyên zanistî, tên çapkirin û weşandin.

Ev xebata li ber deste we jî bi piranî ji berhemên pêşkeşîyan pêk hatiye. Hinek ji wan jî lêkolînên ku cuda û bi serê xwe hatine amadekirin in. Lê li cihekî nehatine çaplkirin û weşandin Bi her awayî armanca van çalaki û xebatan gîhîştandina hin agahîyan bo millet e. Bi vê xebatê jî me xwest ku em hin pêşkeşî û lêkolînên mamoste û lêkolînerên qada Kurdî bigêjînin ber deste xwendevanan.

Di vê berhemê da deh gotar hene. Gotarek Tirkî, gotarek Zazakî û heşt gotar jî Kurmancî ne. Hinek ji van li ser rêziman û zimannasîyê ne. Hinek jî li ser wêjeya klasik, wêjeya modern, çand û folklorê ne.

Em hêvî dikin ku xebat û çalakîyên bi vî rengî zêdetir bin û bi vî şeklî her dem werin berhevkirin û çapkirin.

Edîtor

Doç. Dr. Osman ASLANOĞLU

Berfanbar / Aralık 2024

# Tor, Malper û Platformên Civakî yên Akademîya Kurdî*

Ahmed KANİ*

Tahirhan AYDIN**

**Kurte**

Îro, lêkolîna zanistî bûye pêvajoyek ku bi piranî bi bikaranîna komputer û înternetê tê meşandin. Gelek malperên tora civakî hene ku akademîsyen dikarin torên xwe yên akademîk ava bikin. Armanca me di vê xebatê da ew e ku em torên civakî, malper û platformên akademîk ên heyî bidin nasîn ku akademîsyenên kurd dikarin agahîyan di nav xwe da parve bikin.

Me hewl da ku agahîyên ku me ji çavkanîyên cihêreng di derbarê torên civakî, malper û platformên akademîk ên kurdî yên akademîk da bi bernameyên pêşkeşkirina zanistî pêşkêşî we bikin.

Hema bêje hemû torên civakî, malper û platformên akademîk ên kurdî di sala 2009an da hatine avakirin. Ev geşedan li gel atmosfera erênî ya ji ber înîsîyatîfa demokratîk a li Tirkîyeyê derketîye holê. Wekî mînak, Tora Civakî ya Kurdî ya Akademîk Tora Lêkolînên Kurdî (KSN) li Swêdê ji alîyê Welat Zeydanlıoğlu ve di sala 2009an da hatîye damezrandin. Ev şebeke ji bo ku akademîsyenên ku bi vî warî ra eleqedar dibin, li ser ziman, çanda kurdî û bi kurtî lêkolînên li ser kurdan agahdar bin, hat avakirin.

* Ev gotardi sempozyuma bi navê "Dicle Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Lisansüstü Öğrenci Sempozyumu 7-9 Kasım 2023"ê da hatîye pêşkêşkirin.

* Xwendekarê Doktorayê: Enstîtuya Zanistên Civakî Beşa Makezanista Ziman û Çanda Kurdî Zanîngeha Dicleyê-Diyarbekir, ahmedkani21@gmail.com, Orcid: 0000-0002-4968-3581

** Prof. Dr. Beşa Ziman û Edebîyatên Rojhilatî, Fakulteya Edebîyatê, Zanîngeha Dicleyê. Diyarbekir

Nêzîkî salekê bi şûn da di Kovara Enstîtuya Zanistên Civakî ya MAU ya bi navê Mukaddimeyê da gotarên akademîk ên bi kurdî dest pê kirin. Dûv ra, kovarên akademîk ên navneteweyî yek bi yek bi hekem, bi rêya portala DergiParkê, ku wekî malpera sereke tê hesibandin dest pê dikin. Hin ji wan ev in: Mukaddime, Nûbihar Akademî, Enstîtuya Zimanên Zindî ya Zanîngeha Çewlikê, Kovara Lêkolînên Mezopotamyayê (JMS), Derwaze, Kurdiname, Kadim Hikmet hwd.

Di heman salê da (2009) li Tirkîyeyê Enstîtuyên Zimanên Zindî ku wekî platformên civakî yên akademîk tên hesibandin dest pê kir. Di nav van Enstîtuyên Zimanên Zindî da ya ku herî zêde deng veda û di beşên master û lîsansê da herî zêde xwendekar mezûn kir Sazîya Zimanê Zindî ya ku li Zanîngeha Mêrdîn Artukluyê hatîye avakirin e. Di vî warî da yekema din jî mezûnkirina xwendekarên doktorayê yên Beşa Ziman û Çanda Kurdî ye ku di bin banê Enstîtuya Zanistên Civakî ya Zanîngeha Dîcleyê da hatîye avakirin.

Ev torên civakî, malper û platformên akademîk ji bo parvekirina lêkolîna zanistî, çavkanîyên lêkolînê û encamên lêkolînê derfetên giring pêşkêş dikin.

**Peyvên sereke:** Tor, malper, platformên civakî, akademîya kurdî

### Kürtçe Akademik Sosyal Ağ, Site ve Platformlar

## Özet

Günümüzde bilimsel araştırma yapmak, ağırlıklı olarak bilgisayarda ve internet kullanılarak gerçekleştirilen bir süreç haline gelmiştir. Akademisyenlerin kendi akademik ağlarını oluşturabileceği birçok sosyal ağ sitesi bulunmaktadır. Bizim bu çalışmadaki amacımız Kürt akademisyenlerinin kendi arasında bilgi paylaşımını sağlayan mevcut akademik sosyal ağ, site ve platformları tanıtmaktır

Kürt akademik sosyal ağ, site ve platformları hakkında değişik kaynaklardan elde ettiğimiz bilgileri gelişmiş bilimsel sunum programlarını kullanarak sunmaya çalıştık.

Kürt akademik sosyal ağ, site ve platformları neredeyse hepsi 2009 yılında kurulmaya başlandı. Bu gelişmeler Türkîye'deki demokratik açılımlar sonucu meydana gelen olumlu hava ile birlikte meydana geldi. Örneğin Kürt akademik sosyal ağ olarak

İsveç'te, Welat Zeydanlıoğlu tarafından, 2009 yılında Kurdish Studies Network (KSN) kuruldu. Bu ağ Kürt dili, kültürü, kısaca Kürtlerle ilgili yapılan çalışmalardan alanla iligisi olan akademisyenlerin haberdar olmasını sağlamak amacîyla kurulmuştur.

Yaklaşık olarak bir yıl sonra Mukaddime adlı MAÜ Sosyal Bilimler Enstitüsü Dergisinde Kürtçe akademik makaleler yayınlanmaya başlanır. Daha sonra uluslararası akademik dergiler hakemli olarak birer birer DergiPark, ana site sayılan portal üzerinden yayın hayatına başlarlar. Onlardan birkaçı şunlardır: Mukaddime, Nûbihar Akademî, Bingöl Üniversitesi Yaşayan Diller Enstitüsü Dergisi, The Journal of Mesopotamian Studıes (JMS), Derwaze, Kurdiname Kadim Hikmet vs.

Aynı yıl (2009) akademik sosyal platformlar olarak kabul edilebilecek Türkîye'de Yaşayan Diller Enstitüleri kurulmaya başlanır. Bu Yaşayan Diller Enstitüleri içerisinde en fazla yankı uyandıran, master ve lisans alanında en çok öğrenci mezun eden Mardin Artuklu Üniversitesinde kurulmuş olan Yaşayan Diller Enstitüsüdür. Bu alandaki diğer bir ilk de Dicle Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü bünyesinde kurulan Kürt Dili ve Kültürü Anabilim Dalında doktora öğrencisi mezun vermektir.

Bu akademik sosyal ağ, site ve platformlar bilimsel araştırmanın, araştırma kaynaklarının ve araştırma sonuçlarının paylaşılması için önemli olanaklar sunmaktadır.

**Anahtar kelimeler:** Ağlar, web siteleri, sosyal platformlar, kürt akademisi

## Networks, Websites and Social Platforms of the Kurdish Academy

### Abstract

Nowadays, conducting scientific research has become a process that is mostly carried out using computers and the internet. There are many social networking sites where academics can create their own academic networks. Our aim in this study is to introduce the existing academic social networks, sites and platforms that enable Kurdish academics to share information among themselves.

We tried to present the information we obtained from various sources about Kurdish academic social networks, sites and platforms using advanced scientific presentation programs.

Almost all of the Kurdish academic social networks, sites and platforms were established in 2009. These developments occurred together with the positive atmosphere that emerged as a result of the democratic initiatives in Turkey. For example, the Kurdish Studies Network (KSN) was established in Sweden by Welat Zeydanlıoğlu in 2009 as a Kurdish academic social network. This network was established to ensure that academics who are interested in the field are informed about the studies conducted on the Kurdish language, culture and, in short, Kurds.

Approximately one year later, Kurdish academic articles began to be published in the MAU Social Sciences Institute Journal called Mukaddime. Later, international academic journals start publishing one by one through the peer-reviewed DergiPark, the main site portal. Some of them are: Mukaddime, Nûbihar Akademî, Bingöl Üniversitesi Yaşayan Diller Enstitüsü Dergisi, The Journal of Mesopotamian Studies (JMS), Derwaze, Kurdiname, Kadim Hikmet etc.

In the same year (2009), Living Languages Institutes, which can be considered as academic social platforms, began to be established in Turkey. The Living Languages Institute, which has the most resonance among these Living Languages Institutes and has graduated the most students in the fields of masters and undergraduate programs, was established at Mardin Artuklu University. Another first in this field is the graduation of doctoral students from the Kurdish Language and Culture Department established within the Dicle University Social Sciences Institute.

These academic social networks, sites and platforms offer important opportunities for sharing scientific research, research resources and research results.

**Keywords:** Networks, websites, social platforms, kurdish academy

## Destpêk

Di serdema me da, lêkolîn bûye pêvajoyeka wisa ku bi giranî li ser kompîterê û bi rêya înternetê tê kirin (Karaca,

2019:67). Sedema yekemîn a vê pêvajoyê ew e ku înternetê derfeta xwegihandina agahîyên zanistî bo vekoleran afirandîye. Lê di roja me da, bandora herî veguherîner a înternetê jî, xwegihandina agahîyan bêtir, parvekirina agahîyan e. Navgînên web 2.0ê û torên civakî ji bo parvekirina çavkanî

û encamên lêkolînên zanistî derfetan diafirînin. Bi awayekî din li ser înternetê, gelek derfet û navgînên hevkar hene ku vekoler dikarin bi rêya wan ji bo lêkolînên zanistî yên hevpar bicivin. Vekoler bi alîkarîya torên civakî yên akademîk hem dikarin beşdarî torên akademîsyenên qada xwe bin hem jî ew bi xwe dikarin tor ava bikin.

Pêşketina teknolojîya web 2.0ê derfet da akademîsyenên ji welatên cüda, ku bi alîkarîya xetên (online) platforman bi hev ra bixebitin. Tor û platformên civakî yên akademîk, di xala analîzkirina agahîyên pêwendîdar û bikaranîna daneyan da, ji bo berhemdarîya akademîsyenan dibin alîkar. Di roja me da, bidestxistina daneyan hêsan e, lê bi hilberandina van daneyan di afirandina nirxa lêzêdeyî da tor û platformên civakî yên akademîk giring in.

Niha gelek malperên torên civakî hene ku akademîsyen dikarin torên xwe yên akademîk pê çêbikin. Platformên tora civakî yên akademîk di nava xwe da, platformên ser xetê (online) an bernameçêkerên ku piştgirîya çalakîyên lêkolînên ser xetê û di heman demê da derfeta afirandina torên civakî ji bo zanyaran pêşkêş dikin, dihewînin. Bi alîkarîya torên civakî yên akademik, vekolar dilarin çavkanîyên xwe bi hev ra parve bikin. Herweha dikarin bi hev ra li ser çavkanîyan xebat û analîzan bikin. Ango vekoler dikare bi alîkarîya torên civakî yên akademik, hem hawîrdora xwe ya lêkolînê biafirîne, hem jî xizmetên ku ji bo vê armancê hatine bipêşxistin bi kar bîne (Güler û Mutlu, 2013).

Têkilî û hevkarîyê akademîk, di salên borî da, ji ber ku bi derfetên ku ji alîyê derfetên takekesî, herêmî û erdnîgarî ve dihatin pêşkêşkirin, sînordar bûn. Lê piştî ku înternet ket nav jîyana me, wan dest bi pêşketin û guherîna

paralel kir (Karaca, 2019). Berê danûstandin û parvekirina di navbera vekoler û zanyarên ku ji erdnîgarîyên cuda beşdarê xebata hevpar dibûn, bes bi rêya e-nameyan pêk dihat. Torên civakî, di destpêkê da zêdetir wekî kanal bo têkilî bi kesên ku bikarhêner berê nas dikin ra, hatin hilbijartin. Îro, kesên ku hev nas nakin lê tiştekî wan ê hevpar heye jî, bi rêya torên civakî dest bi avakirina danûstandinê kirine û bandor li hev kirine. Bi rêya torên civakî yên akademik, têkilîdanîna bi mirofên cihêreng ra, parvekirina çavkanî û encamên lêkolînan, giring in (Kutlutürk û Akbayrak, 2013).

Torên civakî yên ku ji bo armanceka taybetî têne vekirin, ew malper in ku li ser wan, wekî di jîyana rastîn da çawa mirov bikaranîna îşaretên sembolîk û îfadeyên rû, tesîr li hev dike. Dema em behsa torên civakî dikin mînakên herî giring platformên (malper) wekî Facebook, Twitter (X), LinkedIN, Youtube, Instagram, Tumblr, Snapchat û WhatsApp derdikevin pêş. Lê torên civakî yên akademîk bi hin taybetmendîyên xwe, ji malperên din ên torên civakî cuda ne. Malperên torên civakî yên bo akademîsyenan di derbarê bikaranîn û karîgerîya endaman di hilberîna naveroka akademîk da û hilberîna îstatîstîkên bandorkarîya wan li ser endamên din, di xwe da dihewînin. Di vê çarçoveyê da bo ku toreka civakî bibe *toreka civakî ya akademîk* divê xwedî van çar hêmanan be (Ortega, 2016):

1- Profîlên kesan: Afirandina bikarhênerek alîkarîya mirov çawa tevlî torê dibe û bi endamên din ra çawa têkilî datîne dike.
2- Naverok: Ew hêman e ku beşdaran di xalekê da tîne cem hev; wekî keresteyên di malperê da tên berhemînan an pêşkêşkirin tê derbirîn.
3- Torên ragihandinê: Peywendîyên navxweyî yên profîlên ku dê tora civakî bi kar bînin îfade dike.
4- Pîvan: Di xwe da, pîvanên ku bi kêrî tesbîtkirina çalakîyên di platformê da pêk tên, dihewîne.

*Torên akademîk ên civakî* ligel taybetmendîyên torên civakî, van derfetên li jêr jî peşkeş dikin (Oh ve Jeng, 2011):

1- Bikarhêner dikare ji xwe ra profîleka ku nîvend-lêkolîn, profesyonel portfolio û otobîyografîya wî dihevîne, saz bike.
2- Piştgirîya parvekirina weşanên şexsî, çavkanî û referansan dike.
3- Ji bo çalakîyên lêkolînên endamên komê derfeta pêşkêşkirinan bi sazkirina koma bikarhêneran pêk tê.

## Modelkirin û Analîzkirina Torên Civakî yên Akademîk

Vekoler bi rêya torên civakî yên akademîk dikare datayên (dane) cêwaz erdnîgarî û demî vekoline, nîgarên qadên zanîstên nû karakterize bike, torên jêgirtinan vekole û dikare di derbarê lêkolînên xwe da agahîyan parve bike (Kong û yên din, 2019). Bi tevê vê dikare sûd, ji teknolojî û hêsankarîyên ku ji bo hêsantir lêkolînên xwe bi rê ve bibe hatine hilberîn, bigire û bi vî awayî dikare berhemdartir bibe.

Vekolandina zanînên heyî ya akademîsyen û zanyaran bi çavkanîyên berdest bi awayê azmûneka kûr, dibe ku ew ji wan ra bibe alîkar da ku çareserîyek ji pirsgirêkên xwe ra pêşkêş bikin, lê ew di heman demê da ji bo ku encamên bandordar û pêşkeftinê bi dest bixin, dibe asteng. Pêwîst e ku di vê mijarê da lêkolînên sîstematîk bên kirin. Wekî mînak, ji ber derfetên kêm ên gihîştina zanîn, kelûpel û teknolojîyê ya vekoleran, geşedanên akademîk jî bi gavên biçûk pêk dihatin. Lêbelê bi înternet û zêdebûna populerîteya wê ra, hema bibêje di her qadê da teknîkên analîtîk hatine bipêşxistin û palpiştîya bi sepan (aplîkasyon) û parvekirinên ku dê hêsankarî bo vekoleran bike, hatîye kirin. Wekî mînak, pirtûkxaneyên online dîjîtal, platformên xizmeta akademîk, (AMiner, Lêgerîna Academic a Microsoftê (MAS), DBLP, Google Scholar, CiteSeerX û wd), nivîskar, weşan, jêder û bi datayên din ra eleqedar malperên gihîştina bi milyonan agahîyan, sîstemên lêgerîn, rêvebirina lêkolînan, keşfa pisporî û pêşnîyazan bo xizmeta akademîsyenan hatine pêşkêşkirin (Konrad û yd, 2019).




Şekil: Banê Têgehî yê Xebatên Torên Akademîk ên Civakî (Kong û yd, 2019)

Dema em li şeklê jorê binêrin em ê bibînin ku kurteya torên civakî yên akademîk û peywendî hatine dayîn. Bi armanca vekoler ve girêdayî di çarçoveya bingeha modelkirin, analiz û sepandinan da xebat hatîye şekilkirin. Bi vî awayî bêyî sînorê dem û cih mirov digihîje datayên pêwîst, digihîje rê û rêbazên bikaranîna datayan, sepandin û encam tên parvekirin û weşandin.

## Torên Civakî yên Akademîk ên Kurdî

Eger em torên civakî yên akademîk ên kurdî bigirin dest, em ê bibînin ku ji sala 2009an bi şûn da hinek gavên erênî, wekî vekirina TRT 6ê (TRT Kurdî) ku di çileye sala 2009an da bi kurdî dest bi weşana 24 saetan kir, hatine avêtin. Di nav kurdan da kesên ku vekirina vê kanalê wekî gaveka baş dîtin jî û yên ku wekî amûreke propagandaya dewletê dîtin jî hebûn (Keskin, 2018).

Hema bêje di sala 2009an da avakirina hemû torên civakî, malper û platformên kurdî yên akademîk dest pê kirîye. Ev geşedan, ligel atmosfera erênî ya ku ji ber înîsîyatîfa demokratîk a li Tirkîyeyê derketîye holê, pêk hatin. Wekî mînak Tora Xebatên Kurdî (Kurdish Studies Network-KSN) jî di sala 2009an da, wekî bingeheka akademîk a lêkolînê li Swêdê, ji alîyê akademîsyenê kurd ê Bakurî, Welat Zeydanlioglu ve hat damezrandin.[1] Ev tor hatîye avakirin ku akademîsyenên ku di warê ziman çanda kurdî da dixebitin ji encamên xebatan, bi kurtî xebatên li ser kurdan agahdar bibin.

Tora KSNyê toreka civakî ya akademîk e, li derûdora wê hewldanên berfirehkirina xebatên akademîk li derveyê welat her ku diçe zêde dibin. Xebatên li Welatên Amerîkaya latin, bi taybetî li Brezîlyayê bi pêşengîya akademîsyena jin Maria Florencia Guarche Ribeiroyê, Brazilian Network of Kurdish Studies launched/ Tora Brezîlyayê ya Lêkolînên Kurdî dest pê kirîye.[2] Ev tor ji alîyê 30 vekolerên ji asta doktorayê derçûyî ve hatîye avakirin. Dema me kurteya pêşkêşîya xwe li ser Google Groupa KSNê parve kir wan got em ê bi kêfxweşî li hêvîya nivîsa te bin. Ev mînak jî nîşan dide ku çiqasî roleka giring a Torên Civakî yên Akademîk heye.

Di heman demê da torên civakî yên akademîk bi kêrî birêvebirina agahîyên bîblîyografîk jî tên. Wekî mînak li ser Tora KSNê dema mirov beşa bîblîyografîyê veke dêbibîne ku gelek pirtûk û gotarên akademîk hatine tomarkirin yanî bîblîyografîyeka dewlemend derdikeve pêşberî mirov.

## Platform û Malperên Civakî yên Akademîya Kurdî

Têgiha hevkarîyê, ji sala 1665an ve ku kovarên zanistî geşedan kirine, bûye hêmaneka bingehîn a zanistê. Web 2.0, ragihandina zanistî û hevkarîyê; bi taybetîyên xwe yên beşdarker, hundrîner û hevkarîner veguhaztîye webê

[1] Navnîşana malpera KSNê: http://kurdishstudiesnetwork.net/ e. Ji bo pêwendî û parvekirina encamên xebatan navnîşana Google Groupa KSNê, KSN@googlegroups.com tê bi kar anîn.

[2] Florenciayê ev link: https://anfenglishmobile.com/culture/center-for-interdisciplinary-research-in-kurdish-studies-created-in-brazil-69696 parve kirîye.

(înternetê). Bi sepandinên webê ragihandina di navbera zanyaran da, afirandin û belavkirina agahîyên nû bi lez kirîye (Giglia, 2011).

Di xebatên zanistî da, ji rêvebirina zanînên bîblîyografîk bigire heta bigihîje vekolînê gelek web 2.0 û sepandinên torên civakî hene. Rebuinî (2011), ev sepandin di sê qadan da polandîye (sinifandîye) Mutlu (2012):

1- Parvekirina lêkolînan: Vekoler dixwazin xebatên xwe bi vekolerên din ra parve bikin û nîqaş bikin. Tor (Academia, ResearchGate û hwd) û platformên civakî yên akademîk ên lêkolînan (Hubzero, myExperiment û hwd) û ên parvekirina dokunentan (Slideshare, Scribd, Cloud Hiding û hwd) vê derfetê didin vekoleran.
2- Parvekirina çavkanîyan: Vekoler dixwazin çavkanîyên jê sûd wergirtine bi vekolerên din ra parvebikin û ji çavkanîyên kesên din jî sûd werbigirin. Bi vê armancê ji programên birêvebirina serdanên bîblîyografîk (Mendeley, Zotero û yd.), rêveberên îşareta cihî (Diigo, Delicious û yd.) û îndeksên jêgiran (Google Scholar Citations, Microsoft Academic Research û yd.) sûd werdigirin.
3- Parvekirina encaman: Yek ji taybetîyên bingehîn ên web 2.0ê û torên civakî jî ew e ku vekoler bikarin encamên xebatên xwe bi rêya blog, wiki siteyan (Blogger, Wikispaces û blogên zanistî yên din) û serwisên zanistî yên nûçeyan (SciTopics, Wikio û yd.) kovarên ji gihîştinan ra vekirî û arşîvên vekirî (Scientific Commons, Public Library of Science û yd.) bi kesên din ra parve bikin.

Mirov dikare tor û platformên civakî yên akademîk bike şeş beş: A) Malperên etîketkirinên civakî (Bookmarking), B) Torên parvekirina xebat û dokumentan, C) Bernameyên birêvebirina referansan, D) Kursên online/perwerde/xizmetên zanîngehan, E) Çareserîyên pêşkêşker ên dijîtalî (malperêndepokirina dokumentan) wekî Google Drive û hwd) bernameyên sûdwer, pêvekirî û malper.

Mirov dikare Enstîtuyên Zimanên Zindî li Tirkîyeyê û beşên ziman û çanda kurdî wekî platformên mekanî bi nav bike. Her çiqas platform û malperên civakî yên akademîk dîjîtal bin jî ji bo akademîya kurdî ev enstîtu û beşên ziman û çanda kurdî wekî mîladek li Bakur tên hesibandin (Keskin, 2018).

Wekî em di tabloya jêrîn a li ser gotarên akademîk ên kurdî da jî dibînin, salek piştî (2010) vebûna enstîtuyên zimanên zindî gotara pêşîn, di kovara Mukaddîmeyê da, ya Enstîtuya Zanistên Civakî ya Zanîngeha Mêrdîn Artukluyê derketîye.

| **KOV** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** | **2** |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| Derwa | | | | | | | | | 10 | 2 | 6 |
| e- | | | | | | | | 1 | 3 | 7 | 4 |
| IJOKS | | | | | | | 6 | 14 | 2 | 21 | 11 |
| JMS | | | | | | | | 5 | 12 | 6 | 3 |
| Kadim | | | | | | | | | 1 | 4 | |
| Kovar | | | | | | | 10 | 11 | 7 | 5 | |
| Muka | | 2 | 2 | 2 | | | 2 | | 5 | 2 | 2 |
| Nûbih | | | | | | 6 | 7 | 7 | 7 | 6 | |
| **Komî** | | 2 | 2 | 2 | | 6 | 25 | 3 | 47 | 53 | 2 |

Tablo 1: Hejmara gotarên kurdî li gor kovar û salan (Kan, 2019)

Piştî vebûna beşên akademîya kurdî li Bakur, bi rêya portala DergiParkê ku wekî malpera sereke ya akademîyên Tirkîyeyê dixebite, êdî berhemên xebatên akademîk ên kurdî wekî ku di tabloya kovarên akademîk ên kurdî da jî dixuyê, di asta navneteweyî da cihê xwe girtin. Pêwendî û parvekirina berhemên akademîk ên kurdî, li ser platformên civakî yên akademîk di asteke berfireh da tên kirin.

## Encam

Wekî di vekolînê da jî xuya ye tor, malper û platformên civakî yên akademîk xwedî gelek fonksîyonan in. Em dikarin bibêjin, van torên civakî, malper û platformên

akademîk ji bo parvekirina lêkolîna zanistî, çavkanîyên lêkolînan û encamên lêkolînan derfetên giring pêşkêş dikin.

Her ku diçe asta bikaranîna tor, malper û platformên civakî yên akademîk berfirehtir û bi kalîtetir dibe. Lê bi piranî zimanê van tor, malper û platformanên civakî yên akademîk bi tevî ku mijarên wan ziman, çand û dîroka kurdan e jî bi îngilîzî ye.

Di gelek qadên wekî parvekirina xebat, çavkanî û encaman da ev tor, malper û platformên civakî yên akademîk bi kêrî vekoleran tên. Wekî di pêşkêşê da jî amaje pê hatîye kirin, akademîsyenên kurd dikarin ji tor, malper û platformên civakî yên akademîk ên navneteweyî jî sûd werbigirin.

## Çavkanî / Kaynakça /References

Giglia, E. (2011). Academic social networks: It's time to change the way we do research, European Journal of Physical and Rehabilitation Medicine, 47 (2), 345-349.

Güler, E. û Mutlu E. (2013). Akademik personelin akademik sosyal ağları kullanım düzeyi: Anadolu Üniversitesi örneği, Eğitim ve Öğretim Araştırmaları Dergisi / Journal of Research in Education and Teaching, Mayıs 2013, 2(2), 72-77.

Kan, A. (2019). Kadim Hikmet - Uluslar Arası Sosyal Bilimler Dergisi - Sayı: 1 - Yıl: 2019. rr. 54-69.

Karaca, M. (2019). Sosyal Medya Platformları, Anadolu Üniversitesi Yayınları, Eskişehir 2019 r. 67.

Keskin, N. (2018), Serborîya Akademîya Kurdî li Tirkîyeyê û Pirsgirêkên wê, e-Şarkiyat İlmi Araştırmalar Dergisi/Journal of Oriental Scientific Research (JOSR) Nisan-2018 Cilt:10 hejmar:1(19)/April-2018 Volume:10 Issue:1 (19) rr. 471-485

Kong, X., Shi, Y., Yu, S., Liu, J. û Xia, F. (2019). Academic social networks: Modeling, analysis, mining and aplications, Journal of Network and Computer Applications, 132, 86-103.

Kutlutürk, L. ve Akbayrak, E. H. (2013). Akademik araştırmalarda web 2.0 etkisi, ÜNAK 2013 Konferansı: Bilgi Sistemleri, Platformlar, Mimariler ve Teknolojiler, 19-21 Eylül 2013, Marmara Üniversitesi, İstanbul, 91-96.

Mutlu, M. E. (2012). Kişisel araştırma ortamları, http://kisiselogrenmeortamlari.blogspot.com/2012/11/personal-research-environments.html. (23.08.2019).

Oh, J. ve Jeng, W. (2011). Groups in academic social networking services--An exploration of their potential as a platform for multi-disciplinary collaboration, In Proceeding of 2011 IEEE SocialCom. (http://ieeexplore.ieee.org/xpls/abs_all.jsp?arnumber=6113165).

Ortega, J. L. (2016). Social network sites for scientists: A quantitative survey, CP Chandos Publishing, Oxford.

Rebuin, (2011). Science 2.0: The use of social networking in research, REBIUN (Red de

Bibliotecas Universitarias), Madrid.

# Di Destanên kurdî de Mînakên Motîfa Lehengên Alîkar

Ayetullah ÇELİK*


## Kurte

Weke zanistekê folklor li ser vebêjeyên gelî xebatên xwe roj bi roj berfirehtir dike. Di vebêjeyên gelî de leheng li pey dozekê ne. Li pêş leheng rêyeke dijwar û dirêj heye. Ji bo hêsankirina dozê leheng, li rû xwe hinek alîkaran dibînin. Ev alîkar di vebêjeyan de caran weke mirov, caran weke ajal, caran jî weke amûrekê derdikevin pêşiya me. Lê ev cure leheng bi tevahî di xalekê de digihîjin hevdu. Ev xal jî hêsankirina doza lehengî ye. Taybetiya hevpar ya tevahiya van alîkaran ev e ku dozê li pêş leheng hêsantir dikin.

Di vê xebatê de ev cure alîkar cih digirin. Li ser 8 destanên Kurdî lêkolînek hatiye kirin û dû vê lêkolînê, hinek mînakên motîfa lehengên alîkar hatine tesbîtkirin. Di destanên Kurdî de jî weke vebêjeyên gelî yên dinê jimareke zêde ji van lehengan hatine peydakirin. Ev xebat tesbîtkirina ev cure lehengan ji xwe re kiriye mebest.

Ev xebat ji sê beşan pêk tê. Beşa ewil li ser wate û cureyên destanan radiweste. Beşa duyem weke têgehekê, behsa cihê têgeha motîfê ya di vebêjeyên gelî dike. Di beşa dawî de jî cureyên motîfên alîkar yên ku ji destanên Kurdî hatine berhevkirin cih digrin.


**Peyvên sereke:** Folklor, Folklora Kurdî, Destan, Destanên Kurdî, Motîf.

## Kürt Destanlarında İmtihan Motifi Örnekleri


## Özet

Bir bilim olarak folklor, halk anlatıları üzerindeki çalışmalarını gün geçtikçe çeşitlendirmektedir. Halk anlatılarında kahraman, bir


* Xwendekarê Doktorayê li Zanîngeha Dicleyê, ayet.hasanoglu49@gmail.com, Orcid: 0000-0001-6646-5183

davanın peşinde karşımıza çıkmaktadırlar. Kahramanın önünde zorlu ve çetin bir yol bulunmaktadır. Amaca ulaşma yolunda kahramanın etrafında bazı yardımcı kahramanların belirdiğini görüyoruz. Bu kahramanlar bazen bir insan, bazen bir hayvan, bazen de bir eşya silüetinde karşımıza çıkmaktadırlar. Tüm bu kahramanların ortak noktası birdir. Tümünün varlık sebebi kahramana yardımcı olmaktır.

Bu çalışmada bu çeşit kahramanlar üzerinde durulmuştur. 8 kürt destanı üzerinde bir araştırma yapılmış olup, bahsi geçen destanlarda tespit edilen yardımcı kahraman motiflerine yer verilmiştir. Kürt destanlarında, diğer halk anlatılarında tespit edildiği gibi sayıca çok fazla yardımcı kahraman motifleri tespit edilmiştir. Bu çalışma, bu tür motiflerin tespitini amaç edinmiştir.

Çalışma 3 bölümden meydana gelmektedir. Birinci bölümde destanın tanımı ve türleri üzerinde durulmuştur. İkinci bölümde motif kavramının halk anlatılarındaki yeri üzerinde durulmuştur. Çalışmanın üçüncü ve son kısmında Kürt destanlarında tespit edilen imtihan motifi örneklerine yer verilmiştir.

**Anahtar kelimeler:** Folklor, Kürt Folkloru, Destan, Kürt Destanları, Motif

## Examples of Test Motifs in Kurdish Epics

### Abstract

Folklore, as a science, diversifies its studies on folk narratives day by day. In folk narratives, heroes appear in pursuit of a cause. The hero has a difficult and difficult road ahead of him. We see that some supporting heroes appear around the hero on the way to achieve the goal. These heroes sometimes appear in the form of a person, sometimes an animal and sometimes an object. All these heroes have one thing in common. The raison d’etre of all of them is to help the hero.

This study focuses on these types of heroes. A research was conducted on 8 Kurdsih epics and the supporting hero motifs identified in the mentioned epics were included. In Kurdish epics, as in other folk narratives, many supporting hero motifs have been identified. This study aims to detect such motifs.

The study consists of 3 parts. The first chapter focuses on the definition and types of epic. In the second part, the place of the concept

of motif in folk narratives is emphasized. In the third and last part of the study, examples of test motifs found in Kurdish epics ar included.

**Keywords:** Folklore, Kurdish folklore, epic, Kurdish epics, motif

## Destpêk

Di pêvajoya geşedana dîrokê de her netew di hinek merhaleyan de derbas bûye. Di vê pêvajoyê de li dû xwe hinek berhem hîştine. Ev berhem heya demekê wek berhemên devkî ji nifşek derbasî nifşa din bûne. Piştî nivîs di jiyana mirovan de cih digire, îcar mirov radibin serpêhatiyên xwe derbasî nivîsê dikin. Ev derbasbûyin li hember xetereya nemanê hêza berxwedana berhemên ku ji mirovan derbasî nifşa din dibin zêdetir dike. Ong (2014:19), di mijara çandên devkî û nivîskî de behsa 78 zimanên xwedî edebiyat dike, dîbêje ji hezaran zimanî tenê 78 ziman xwe gihandine nivîsê dibêje. Ev rêjeya ku li hember zimanên xwedî nivîs zêdebûna zimanên bêyî nivîs nîşanî me dide bi hêza deng ve girê dide. Tirkan di gotineke xwe ya pêşiyan de li hember devkîbûna gotinê, nivîsê wek, "*gotin difire, nivîs dimîne*" pesinandine. Çîniyan jî dîsa di nêzî vê wateyê de nivîsê bi gotina xwe ya "*hibra herî rengçûyî jî ji bîra herî zexm baştir e*" li hember devkîbûyîna peyvê pesinandine. Piştî ku wek dîsîplîneke xweser folklor, di sedsala 19emîn de di akademyayê de ji xwe re cihek dadigire li ser tevahiya van berhemên ku li dû mirovan mane radiweste. Burke (1996:25) di nav pêvajoya belavbûna xebatên folklor û netewperweriyê de têkiliyeke xurt dibine.

Piştî şiyarbûna fikra netewetiyê piraniya netewan berê xwe zivartin jiyana gundîtiyê û di nav jiyana mirovên li derveyî qadên medenî dijîn, de berhevkariya hêmanên folklorîk kirin. Nivîskarê polonî Adam Czarnocki di 1818yan de wuha dibêje:

> *Divê em biçin gundan, tevlî şahî, kar û lîstokên wan bibin, em divê wan di malên wan yên ser wan bi qamîşan hatine nixamtin ziyaret bikin. Ji dûyê ku ji ser wan de belav dibe, li wê derê hê jî denge merasimên berê olan dide, kilamên bere hê jî têne bihîstin.(h.b: r.23)*

Ji bo neteweyên ku di pêvajoya endustriyê de derbas bûn ji hêla zimên de di navbera qadên medenî û nemedenî de guherîneke mezin çêbû. Qadên medenî ji ber pêşketinên xwe yên di qada endustriyê de bi pêşketin û guherînekê re rûbirû man. Ev guherîn bala mirovan kişand û ji welatên derdor mirovan berê xwe dan van welatên pêşketî. Piştî demekê êdî li bajaran di dewsa neteweyek de tevliheviyek çêbû di nav netewên cuda cuda de. Ev gelên koçkirî bi xwe re ziman û çanda xwe birin cihê çûnê. Li wê derê jî bi çandekê re rûbirû man. Ev pêvajo bibûya nebûya wê di nav neteweyan de danûstandinekê çêbikira. Vê danûstandinê jî di cihê çandeka yekrengî de çandeke pirrengî û pirdengî derxist holê. Ji ber van sedeman banga Czarnocki ya me li jorê cih dayê bêwate nîn e. Bersiva pirsa *"Çima gund?"* di vir de ye. Wî li hember jiyana mirovên di qadên medenî de baweriya xwe bi hêza yekrengî an jî bi gotineke din bi xwerûbûna çanda gundiyan anîbû. Dema folklor an jî edebiyata gel jî dema tê gotin bê sedem nîne ku di dewsa qadên medenî de pêşî qadên nemedenî, wek gund têne bîra mirov.

Di vê xebata xwe de min ewilî cih daye wate, cure û taybetiyên destanan. Destan çi ye, li cihanê ji bîra gelên cihanê destanên herî berbelav kîjan in û ji bîra gelê kurd cureyên destanên heyî cih girtine di vê beşê de. Di beşa duyem de me cih daye peyva motîfê. Motîf çi ye, cihê xebata Stith Thomsonî di lîteraturê de çiye û hwd. Di beşa dawî ya vê xebatê de jî ji destanên Kurdî mînakên motîfa lehengên alîkar cih girtine.

## Beşa Yekem

## Destan

### 1.1. Wateya Têgeha Destanê

Di zanistên civakî de têgehên heyî xwedî çend wateyan in. Ji bo peyva destanê gelek kesan hewl dane da ku di çarçoveyek de navek lê bikin. Keskin (2019: 177) destanê wîha bi nav dike: *"Destan cureyek ji gotinên gelêrî ye ku hem motîfên mîtolojîk û hem jî yên efsanewî dihewîne."* Ev vê nîşanî me dide ku di navbera destan û mît û efsaneyên wî gelî di naveroka xwe de dihundirînin. Ev peyv, di Kurdî, Tirkî û Farisî de heman wek

destan derbas dibe. Di zimanên Latînî de jî di heman cihê peyva destanê de *''epopoeia''* derbas dibe ku ev jî peyveke Grekî ye.

Di bihûrîna dîrokê de mirov, di dunyaya tê de dijî de li dû xwe hinek berhemên ku xîtabê bîra hevpar ya mirovahiyê dikin hiştine. Ji van berheman hinek ji wan devkî, hinek jî nivîskî ne. Destan ji van cureyan bes hebek e. Destan, hemû hêmanên madî û manewî yên wê civakê di hundirê xwe de dihewîne. Bi hûrbûyînên li ser van destanan mirov derbarê wan çandan de agahiyan hildidin. Serdema derketina destanên xwezayî, nayê zanîn û di destanên xwezayî de nivîskarek nîn e. Bi navê devkî û nivîskî du cure destan hene. Yên devkî ji hêla dema derketina xwe ya holê û nivîskarê xwe de metnên gelêrî ne. İnan (1987:161) destanê dişibîne *''bajarekî nû ku li ser xirbeyên avahiyên kevn hatiye avakirin''.*

## 2.2. Destanên Herî Berbelav Yên Cihanê

Di bîra hevpar ya mirovahiyê de hinek ji wan destanan ji hêla bandora xwe ve sînor bihurîne û bûne malên hevpar yên mirovahiyê. Ji van destanan hinek ev in ku hinek ji wan ev destan in ku me navên wan li jêrê dane.

Ilyada (Yûnan)

Odysseia (Yûnan)

Gilgamêş (Sumer)

Şahname (Fars)

Ramayana (Hînd)

La Cid (Spanî)

Nibelungen (Alman)

Îgor (Ûris)

Chanse de Roland (Fransî)

Şînto (Japon)

Kalavela (Fîn)

Ji van destanan em dê kevanekê bo destana Fîniyan ya bi navê Kalavela vebikin. Destana Kalavelayê ji gelek aliyan de ji destanên dinê diqete. Ev destan di nav wan destanên me navên wan li jorê dan, destana dawiyê ye ku derbasî nivîsê bûye. Li gor Alan (2013: 35) bi çapkirina destana Kalavelayê bi carekê statûya zimanê Fînî bilind bûye. Ev vê nîşanê me dide ku metnek epîk çawa dikaribû neteweyekê şiyar bike. Niha wek pirsek mirov dikare bipirse, gelo niha wek nivîskî metnên mîna Mem û Zînê ku di naveroka xwe de metnên folklorîk in, tunebûna me jî dikaribû gelo behsa edebiyata vî zimanî bikira? Li gor Ong (2014: 19) niha li ser rûyê erdê bes edebiyata 78 zimanên ku têne axaftin heye. Ango bi gotineke din, bes 78 ziman xwediyê edebiyatekê ne. Mirov xwe nagihîne tevahiya vê nivîsa Ong, ka gelo li gor kîjan taybetiyan, zimanan wek yên xwedî edebiyat û yên weke nebûne xwedî edebiyatekê ji hevdû dabeş dike. Ji ber vê sedemê em niha nikarin niha zimanê Kurdî di vê kategorîzekirina Ong de di cihekî de bicih bikin. Em ê niha derbasî beşa destanên Kurdî bibin.

### 2.3. Destanên Kurdî

Weke piraniya neteweyên medenî, di bîra kurdan de jî gelek destan hebûna xwe parastine. Ji vana çend jê destanên navdar in û di nav piraniya kurdan de têne zanîn. Zembîlfiroş, Kela Dimdimê, Mem û Zîn, Siyabend û Xecê, Derwêşê Evdî ji van destanên berbelav û navdar bes hinek in. Helbet hinek ji wan destanan ji aliyê bandora xwe de piçek herêmî mane. Sêva Hecî, Binefşa Narîn, Cembeliyê Kurê Mîrê Hekarî, Lawikê Kêrê, Eliyê Xarziya jî hinek ji ev cure destan in. Ji van destanan hinek jê bandorekê li ser metnên nûjen jî hiştine. Ev rastiya bin bandora berhemên kevn û niha de mayîn bo kesên wek Hassanpour û Mokrî (Alan, 2013: 61) geşedaneke asayî tête dîtin.

## Beşa Duyem

## Motîf

Motîf çi ye, di kîjan zanistan de weke têgeh derdikeve pêşiya me? Di bîra min de ye, bêyî ku hay û hêviya min ji motîfa

di berhemên folklorîk de hebe, dema min cara ewil peyva motîfê bihîst, motîfên li ser merş û tejên malan hatin bîra min. Dû re dema ketim dû vê peyvê têgihîştim ku di navbera motîfa di hişê min û motîfên nêv berhemên folklorîk de cih digirin de cudahiyeke ewqasî mezin tune bûye. Çawa ku motîfên li ser merşan merşekê temam dikin, yanê çawa ku merş ji van motîfan pêk tên, di vegotinên gelêrî de jî her vegotin ji motîfan pêk tên. Motîf di van vegotinan de yekeya herî biçûk ya xwedî wate ye. Peyva motifê, peyveke Frensî ye û ji hêla etîmolojîk de ji 'motivum' a Latînî tê. Ev peyv tenê ne di qada edebiyatê de, di hinek şaxên hunerê de jî derdikeve pêşiya me. Di vegotinên bîra gel de ji bo em tiştekî wek motîf bi nav bikin divê derasayiyek tê de hebe. Ev derasayîbûn dibe di leheng, bûyer, dem û mekanê de ango kurt û kurmancî dibe ku di her bûyerê de derkeve pêşiya me. Destan, çîrok, efsane çi zêde çi kêm di naveroka xwe de hinek motîfan dihewînin. Ji ber ku di binyada xwe de derasayîbûn û balkêşbûnekê dihewînin, bi xêra serê van motîfan e, ev vegotin li hember jibîrbûnê hebûna xwe diparêzin. Lêkolînerê Emerîkî Stith Thompson (z.1885, m.1976), di qada folklorê de bi xebatên xwe navek li dû xwe hiştiye. Li gor gotina Dorson (Aslan, 2011: 33-45), ''Thompson bi xebatên xwe wek 'bavê folklorê' hatiye naskirin''. Thompson, berhema xwe ya bi navê The Motif-Indeks of Folk Literature (Motîf Indexa Edebiyata Gel) cara yekem di navbera salên 1932 û 1936an de çap kiriye. Piştî vê çapê bi lêzêdekirinan û revîzekirinê di navbera salên 1955 û 1958an de wekî 6 cîld cara duyem çap kiriye. Di rûpela pêşîn ya berhemê de serenavek bi vî awayî heye: *''Senifandineke Çîrok, Kilamên Dirêj, Mît, Fabl, Çîrokên Serdema Navîn, Pirtûkên Henek û Parçeyên Vebêjî yên Di Efsaneyên Herêmî De''*. Weke ku ji serenav jî diyar e çarçoveya berhemê ji ev cureyên vebêjeyên edebiyata gel pêk tê. Ji ber ku destan, ji aliyê naverokî de motîfên çîrokan di naverokên xwe de dihewînin, lêkolîner dikarin ji bo xebatên xwe yên li ser destanan jî ji vê xebatê sûd werbigrin. Thompson di vê xebata xwe de bi awayekî sîstematîk, motîfên di vê cure berhemên me li jorê behs kirin peyda dibin, di berhema xwe de ji tîpa Ayê heya tîpa Zyê bi 23 serenavan senifandiye. Helbet di vir de 21 motîf li gor derasayiya xwe û bi bandora xwe ya di berheman de bo behsê cihek ji xwe re digrin.

Li gorî fikra Thompson (Hikmet, 2016: 42) *‘’divê taybetmendiyên baldar û derasayî yên motîfan hebin”*. Di derbarê motîfan de Thomson wiha dibêje: Di çîrokê de bûyîna dê ne motîfek e. Lê dêya xayîn, dêmarî dikare bibe motîfek. Lewra qet nebe ew, weke tiştekî nedîtî hatiye fikirîn. Bûyerên asayî yên jiyanê motîf nînin. *‘John, cilan li xwe kir û ber bi bajêr meşiya’* gotin, di derbarê bibîr anînê de motîfek jî nahewîne, lê *‘leheng şewqeya xwe ya ku pê wenda dibe da serê xwe, li merşa xwe ya efsûnî rûnişt û ber bi welatê li rojhilatê rojê, rojavayê hîvê çû’* gotin, herî kêm çar motîfan, yanê şewqe, merş, welatê têkûz, rêwîtiya efsûnî ya hewayî dihundirîne (Oğuz, 2020: 84). Dîsa Thompson, motîfê wek *“di çîrokê de yekeya herî biçûk ya ji berê de xwedî qabiliyeta mayî”* (Sakaoğlu, 1980: 24), bi nav dike. Wî di xebatên xwe de motîfên ku di naveroka xwe de derasayiyekê nahewînin ji motîfên din neqandine û di senifandina xwe de ew wek motîf nehesibandine. Thompson, motîfên ku balkêşî û derasayiyekê di naverokên xwe de dihewînin bi 23 sernavan senifandiye. Ew jî ev in:

A. Motîfên Mîtolojîk
B. Ajal
C. Qedexe
D. Sêhr
E. Mirin
F. Bûyerên Derasayî
G. Dêw
H. Îmtihan
I. Jîr û Xêt
J. Xapandin
K. Vajîbûna Qederê
L. Diyarkirina Pêşerojê
M. Sihûd û Qeder
P. Civak
R. Girtî
S. Tehdeyiyên Neasayî
T. Zewicîn
U. Xwezaya Jiyanê
V. Ol
W. Taybetiyên Lehengan

X. Pêkenîn
Z. Motîfên Curbecur

Piştî ku ev xebat ji aliyê Thomson de tê amade kirin, ji wê jî digihîje ber destê lêkolîneran, rastî hinek rexneyan bûye. Thompson her çiqas jimareke gelek zêde ji mînakên motîfan li ser MIFLê zêde kiribe jî em dikarin bibêjin ku berhema wî hê nehatiye temamkirin. Di nav çavkaniyên li ber destê lêkolînerên folklorê de MIFL, di nav xebatên herî berfireh û kêrhatî de hatiye hesibandin. Di serenavê binî yê Motif Indexê de di çarçoveya xebatê de kîjan cure hene yanê bi gotineke din ev rêbaz li ser kîjan cureyên vegotinên gelêrî karîger e hatiye diyarkirin. Di lîsteya motîfan de hinek cih wek jimar bi zanebûn vala hatine hiştin. Ev vala hiştin ji bo lêzêdekirinên dû re derfetek dide destê lêkolîneran. Ji xwe nê pêkan bûye ji bîra tevahiya netewên cîhanê mînakan berhev bike û tevlî xebata xwe bike. Di aliyê karîgeriya MIFLê de lêkolîneran hinek kêmasî tesbît kirine û rexneyên xwe li vê rêbazê kirine. Alan Dundes (1998: 130-135), MIFLê ji ber ku çîrokên mustehcen nehewandine û ji ber ku çîrokên derbarê efrîdan de piştçav kiriye rexne kiriye. Lê pê re jî derbarê vê berhemê de dibêje, bi van kêmasiyên xwe jî di danasîna çîrokên gel de hê jî çavkaniya herî baş e. Hîkmet (2016: 41) jî di derbarê rêbazê de hinek tişt gotine. Bi ya wî: Bêguman dema em bala xwe didin wan, tê dîtin ku di watedarkirina van motîfan de, yanê di tesbîtkirina fikrîyata civakî ya li dû van motîfan de, kêmasiyek heye, lewra eger ew motîf bin, yanê bi serê xwe tematîk bin, divê temaya li dû wan jî bê nîşandan. Her wiha kêmasiyeke dî jî ew e ku ew bi giranî li ser hin herêmên dîyar mijûl bûye û motîfên gelek deverên girîng li derveyî vê ansîklopediyê mane. Karagöz (2019: 75-90), di derheqa hinek kêmasiyên ku di berhemê de têne dîtin û çareserkirina van pirsgirêkan de hinek pêşniyar li bikarhênerên berhemê kirine. Bi ya wî *"lêkolînerên ku xebatên xwe li ser vê rêbazê saz dikin dikarin li xebatê hinek lêzêdekirinan bikin"*. Di MIFLê de ev bi nimare kirinên nû pêkan e. Dema em li rexneyan dinihêrin em dibînin ku berê rexneyan li derekê kom dibe: Çima di MIFLê de tenê ji bîra hinek gelan mînak hatine girtin û çima hinek cure çîrok hatine sansur kirin? Digel van rexneyan em dikarin bibêjin ku xebata Stith Thompson ji bo lêkolînerên li ser folklora Kurdî dixebitin berhemeke xwedî

qîmet e. Ne tenê di tesbîta motîfên destanan de, di çîrok, mît û efsaneyên bîra gel de jî lêkolîner dikarin ji vê berhemê sûd werbigrin.

### 2.2. Motîfa Lehengê Alîkar

Di cureyên vegotinên gelerî de di dewsa alîkaran de herî zêde ajal derdikevin pêşiya me. Di lîsteya motîfan ya Stith Thompson de wek alîkar ajal, di bin serenavê ajalan de di navbera jimarên B300 û B349an de cih girtine. Wek lehengê alîkar; şûr bi koda D1081ê, gustîl bi koda D1076an hatine nîşandayîn. Di nava koma mirovên alîkar de jî motîfa jina alîkar bi koda J155an, alîkarên pîr bi koda N825an, Xoce Xizir, mirovê rûspî, Cebraîl û mînakên mirovên pîroz yên dinê jî bi koda N844an hatine nîşankirin. Wek alîkarekê motîfa şivanê alîkar bi koda N841ê hatiye nîşandayîn. Alîkarên dinê jî bi koda N800 û N899an hatine nîşandayîn.

## Beşa Sêyem

## Motîfa Lehengên Alîkar

Di destanên Kurdî de leheng dema ji bo dozekê derdikevin ser rê, hewcehî bi hinek alîkaran dibînin. Leheng her çiqas bi taybetmendî û xisletên derasayî derkevin pêşiya me jî di hinek cihan de hewcehiya wan bi alîkaran çêdibe. Ev alîkar çawa ku di hinek cihan de wek mirov derdikevin pêşiya me, wisa jî wek ajal an jî di hinek cihan de wek amûran derdikevin pêşiya me. Ji van alîkaran mînaka herî zêde derdikeve pêşiya me hesp e. Mihemed Ronahî (2009:44), derbarê rola hespan ya di edebiyata devkî de dibêje "*hesp lehengiya lehengê xwe zêde dike*" Di piraniya destanan de li rû leheng hespeke çê ya navdar heye. Ji derveyî hespê ji koma mirovên alîkar jina pîr, mirovê pîroz, şivan û ji amûran jî di rola alîkarek de gustîl û şûr derdikevin pêşiya me. Em ê niha derbasî van mînakên motîfên alîkar bibin ku me ew di destanên Kurdî de tesbît kirine.

### 3.1. Ajalên Alîkar

Di destanên Kurdî de li rû leheng wek alîkarekê hinek ajal derdikevin pêşiya me ji van ajalan ya herî berbelav hesp e.

### 3.1.1. Hesp

Ji 8 destanên me li ser wan lêkolîn kiriye, di 5 destanan de em rastî motîfa hespa alîkar hatin. Bozê Rewan di destana Memê Alan de, Sosik, Nijdî, Bilêcan di destana Kerr û Kulik de, Hêşînbozê Surê di destana Siyabend û Xecê de, Herboz di destana Binefşa Narîn de û Hedban jî di destana Derwêşê Evdî de di rola alîkarek de li rû lehengan derdikevin pêşiya me. Di destana Kela Dimdîmê, Sêva Heciya û Zembîlfroş de em rastî motîfeke bi vî awayî nayên.

### 3.1.2. Çûk

Tenê di destana Kela Dimdimê de wek alîkarên lehang teyr derdikevin pêşiya me. Ji derveyî vê di destanên din de em rastî motîfeke bi vî awayî nayên.

## 3.2. Koma Mirovên Alîkar

Di destanên Kurdî de leheng, di rêya xwe ya asê û dijwar de ji nav koma mirovan, rastî hinek alîkaran tên. Ev alîkar caran di rola pîrejinekê de, caran di rola mirovên pîroz de, caran di rola hevalan de, caran jî di rola qewraş û şivanan de dertên pêşiya lehengan. Ev alîkar bi şîretên xwe, bi lehengiya xwe alîkariya leheng dikin.

### 3.2.1. Kesayetên Dînî

Di hinek destanên Kurdî de leheng û malbata leheng bi dîndariya xwe têne nasîn. Ji ber vê yekê li ser rêya xwe, an di xewnên xwe de alikariyê ji kesayetên pîroz digrin. Ev kesayet di destanên ber destê me de weke Xoce Xizir, Şêxê Qureyşiyan, Cebraîl an jî wek ewliya derdikevin pêşiya me. Di destana Siyabend û Xecê de *kalê pîr*, di destana Zembîlfroş de *Cebraîl*, di destana Memê Alan de *Xoce Xidir*, *Xoce Xizir* û *Şêxê Qureyşiyan* di destana Kela Dimdimê de jî wek *ewliya* mirovekî pîroz derdikeve pêşiya me ku tev jî di rola alîkarên leheng de ne.

### 3.2.2.Kesayetên Şervan

Di hinek vebêjeyên gelî de leheng di doza xwe de ne bi tenê ye. Li rû serleheng hinek alîkarên şervan peyda dibin. Ev şervanên leheng, bi serleheng re heman qederê parve dikin û di piraniya mînakên destanan de rastî heman aqûbetê tên. Di destana Siyabend û Xecê de *Qedê*, di destana Kerr û Kulik de *herdu bira*, di destana Derwêşê Evdî de *Sehdûn*, di destana Memê Alan de *Hesen û birayên xwe*, di destana Kela Dimdimê de *Ebdal Xan*, *Xanê Mukrî*, *Teter Xan* mirov dikare ji bo ev cure motîfê mînak nîşan bide.

### 3.2.3.Kesayetên Pîr û Jîr

Di destanan de piraniya lehengan mirovên neşî ne. Ji ber ku hiş nagihînin hinek tiştan di demên herî dijwar de li rû xwe di dewsa şêwirmendek de alîkarên pîr, jîr û dinyadîtî dibînin. Bi xêra serê van alîkaran ji hinek astengan derbas dibin û digihîjin meqsedên xwe. Ji van alîkaran yek pîrejin e ku di navbera hezkiriyan de xeberê dibe tîne. Di hinek mînakên din de jî mirovê kal serpêhatiyên xwe yên jiyanê bi leheng re parve dike. Ji bo vê mînak alîkaran em dikarin ji destana Derwêşê Evdî *Huwêd Beg* nîşan bidin. *Dayo*ya di destana Kela Dimdimê de, *pîrê*ya di destana Siyabend û Xecê de, dîsa *pîrê*ya di destana Kerr û Kulik de, *apo*yê di destana Memê Alan de alîkarên di vî cureyê de ne.

### 3.2.4. Kesayetên Din

Di destanan de leheng dema ji bo dozekê derdikevin ser rê li ser rêya xwe rastî hinek alîkaran tên. Ji vana yê herî zêde derdikeve pêşiya me şivan e. Di destanên Kurdî de leheng bi xêra serê şivanê mala bavê hezkiriya xwe, xwe digihîne hezkiriya xwe. Di destana Binefşa Narîn de, di destana Sêva Heciyan de û di destana Siyabend û Xecê de motîfeke bi vî awayî heye.

## 3.3.Amûrên Alîkar

Di rola alîkaran de weke mirov û ajalan hinek amûr jî bi leheng re derdikevin pêş me ku di vebêjeyên gel de hebûna leheng temam dikin û ji bo hêsankirina doza leheng, bi leheng re têne dîtin. Ji vana yên herî navdar şûr û gustîl in.

### 3.3.1. Şûr

Şûr weke hespê bi navê leheng re weke simbola hêzê tê dîtin. Ji bo têkbirina leheng divê tiştek bê serê şûrê leheng û ji holê rabe. Hekena leheng bi şûrê destê xwe bi tu awayekî têk naçe. Di nav destanên Kurdî de em, di destana Siyabend û Xecê de û di destana Memê Alan de em rastî şûrekî bi vî awayî tên. Tiştê balkêş ew e ku di herdu destanan de jî şûrê wan wek lahor tê binavkirin.

### 3.3.2. Gustîl

Motîfa hevnasînê di lîsteya motîfan ya Stith Thompson de di bin sernavê îmtihanê de bi tîpa Hyê û bi koda H0 – H199an hatiye nîşandayîn. Di destana Siyabend û Xecê de Siyabend dema dibihîze wê birayên Xecê, Xecê bidin Mîrê Ereban radibe wek nîşaneyek bo hevnaskirinê gustîla xwe bi pîreke qasid re ji Xecê re dişîne. Xecê dema gustîla Siyabend bi pîra qasid re dibîne ji pîrê bawer dike. Ne tenê di destana Siyabend û Xecê de lê wek mînak di destana Memê Alan de jî Mem û Zîn bo hevdû nas bikin gustîlên xwe bi hevdû diguherînin. Helbet gustîl di vir de xwedî meneyeke kûr e. Li gor Yaprakê (2017: 710) gustîl bi şiklê xwe çend peyamên veşartî dihewîne di hundirê xwe de. Ji hêla şiklê xwe de giloveriya gustîlê jiyanê, demê û gerdûnê ku destpêk û dawiya wan nîn e temsîl dike. Dîsa li gor Eliade (1992: XIX), îmge, remz û efsane afirandinên nemesûl yên derûnnasiyê nîn in. Di van destanên li ber deste me de jî gustîl bi van taybetîyên xwe wek nîşaneyek hatiye bijartin. Di nav evîndaran de gustîl, ji bo hevnaskirinê roleke girîng dilîze. Di destana Memê Alan û Siyabend û Xecê de em rastî motîfeke bi vî awayî tên.

### 3.5. Guhertoyên Destanên Ku Ji Bo Vê Xebata Me Bûne Referans

**Memê Alan:** Guhertoya ku Roger Lescot berhevkariya wê kiriye. Roger Lescot vê destanê li Rojavayê Kurdistanê ji devê kurdekî bi navê Miço berhev kiriye.

**Derwêşê Evdî:** Di xebata me de guhertoya ku Şahîn Bekir Soreklî ji dengbêj Baqî Xido bihistiye û derbasî nivîsê kiriye bûye referans.

nivîsandîye, di sala 1967an de temam kirîye. Ev mesnewî jî di warê xwe neqane ye. Li ser jîyan û şemaîla cenabê pêxember radiweste. Godişkî li gorî naverokên kitêbên siyerê nezmandîye.

**3. Dîwana Beytan**: Di vê berhema Mela Nûrûllah de ji 285an zêdetir helbest û ji 75an zêdetir jî rûbaî hene. Mela Nûrûllah, gelek ğezel û qesîde û rûbaîyên xwe yên vê dîwanê bi zimanê kurdî, farisî û erebî nezmandine. Çend heb jî bi Tirkî nivîsandine.

**4. Çenta Yetîman**: Berhemeke der barê îbadet û eqîdeyê de ye. Mela Nûrûllah ji bo zarokên kurdan, bi kurdî nivîsandîye. Nevîyê Mela Nûrûllah, Cihat Bakirhan teza xwe ya lîsansa bilind, li ser vê berhemê hazir kirîye. Teza wî, hê çap nebûye.

**5. Es-Sebaîk Fîl Menasîk**: Ev berhem mensûr e. Mela Nûrûllah ev esera xwe bi kurdî nivîsandîye. Mijara berhemê, îbadetên heccê ye.

**6. Kufrul Kebaîr**: Ev nezma Mela Nurûllah jî bi kurdî ye. Godişkî, berhema “El-Kufr wel Kebaîr” a Şêx Fethullah Werqanisî, bi kurdî hûnandîye.

**7. Şerha Mewlûda Kurmancî**: Ev berhem bi erebî ye. Mela Nurûllah, mewlûda Melayê Bateyî ya bi navûdeng, bi erebî şerh kirîye.

**8. Şerha Beyta Dilo**: “Dilo Rabe” helbesteke meşhûr a Feqîyê Teyran e. Mela Nûrûllah, li ser vê şî’rê şerheke bi erebî amade kirîye. Berhem vê şerhê dihewîne.

**9. Camîul Me‘anî**: “Eqîda Îmanê” nezmeke Şêx Ehmedê Xanî ye. Mela Nurûllah, ev berhema Xanî bi erebî şerh kirîye. Camîul Me’anî, vê şerhê dihewîne.

**10. Şerha Tecwîdê**: “Hîdayetus Sîbyan” berhemeke Şêx Eladîn e. Mijara wê tecwîd e. Mela Nurûllah li ser vê berhemê bi erebî şerhek nivîsandîye.

Dibêjin Mela Nûrûllah, dîwaneke biçûk jî amade kirîye. Feqet bi sedem zordestîya darbeya 1971ê, ehlê malbata Mela Nûrûllah ev dîwançe şewitandîye. (Bakırhan, Çenta Yetîman, r. 30)

## Beşa Duyem: El-Hemaîl Û El-Cewahîr Û Berawerdkırına Wan

### 2.1. Kurteagahîyên Derbarê Herdu Berheman De

El-Hemaîl û El-Cewahîr herdu jî destxet in. Bi elfabeya erebî hatine nivîsandin. Sernavên qismên herduyan jî bi erebî ne. Di herdu berheman de li rexê rastê her sernavekê, jimara beytên sernavê borî, bi reqemên erebî tê dîyarkirin. Her weha li rexê çepê jî, temamê hejmara beytan ên heta wê derê, bi reqemên ‘erebî tê diyarkirin. Temamkirina dawîya kîtêban jî bi erebî ne. Di pêşîya El-Hemaîlê de bi erebî nivîsek heye. Di du rûpelên pêşî ên El-Cewahîrê de jî hinek gotinên wecîz ên Mela Nurûllah ên bi kurdî hatine nivîsandin. El-Hemaîl 297 rûpel e. Kîtab ji 46 beşan û 5569 beytan pêk tê. El-Cewahîr jî 220 rûpel e. Tê de 174 qism hene ku 5024 beytan dihewîne.

Mela Nurûllah bi xeta xwe El-Hemaîl nivîsandîye. Di rûpela 297an de Mela Nurûllah dide zanîn ku El-Hemaîl di 1983ê Mîladî (1399ê Rûmî) de temam bûye. Şêx Ğiyaseddîn Emreyê nevîyê Şêx Fethûllah Werqanisî, çend berhemên destnivîs di 1999an de ji Zeynelabîdîn Zinar re dişîne. Di nav wan de ev berhem jî heye. Zeynelabîdin, berhemê latînîze dike. Weşanên Dozê, berhemê di 2007an da li ser navê Şêx Fethûllah Werqanisî çap dike. Zaroyên Şêx Fethûllah bi belgeke îmzekirî didin zanîn ku bi vî navî tu berhemeke bavê wan tune ye. Ev belge di dawîya vê xebatê de peyde ye. Ji xwe di dawîya kitêbê de bi erebî tê îfadekirin ku “bi destê kêşmendê/nazimê kitêbê Nurûllahê jar ê kurê mela Ehmedê Godişkî û Xeyûtî ve, di Rebîulewwela sala 1983an a mîladî de li Tetwanê temam bûye.”

Mela Nûrûllah, El Cewahîr bi destxeta nivîsandîye. Nusxeya din a vê berhemê jî ji alîyê telebeyê Mela Nûrûllah ve hatîye nivîsandin. Di her sê beytên dawîyê yên berhemê de dinezmîne ku di sala 1387ê Hicrî, 1383ê Rûmî û 1967ê Mîladî de nivîsandina wê temam bûye.

Telebekî Mela Nurûllah, ji bo çap bike, destxeta Mela Nûrûllah bi xwe re dibe Lubnanê. Wê demê li Lubnanê (1975-1980) şerê navxweyî heye. Ji lew careke din tu xeber ji feqîyê han û ji destxetê, nayê stendin. Mela Fadilê feqîyekî din ê Mela Nûrûllah,

berîya ku telebe destxetê bibe Lubnanê, ji wê destxetê berhem bi destê xwe îstînsax kirîye. Mela Nûrûllah jî li hin cîyan bi destê xwe nivîsandîye. Destxeta El-Cewahîr a ku Mela Fadilê feqîyê Mela Nurûllah îstînsax kiriye, di meha Nîsanê de, di 1978ê Mîladî de temam bûye.

## 2.2. Teşe Û Wezna Herdu Berheman

Herdu berhem jî mesnewî ne. Mijara wan dînî ye. Bi besmele û hemdele û selweleyê dest kirine. Jîyan û sîyer û şemaîla pêxember, hal û tevger û rabûn û rûniştina pêxember dihewînin. Ji lew mesnewîyên dînî û dîdaktîk in. Di wan da coş û xweşî jî heye, carna behsa mêranîya sehabayan jî hatîye kirin. Ji lew meriv dikare bêje ku lîrîkî û epîkîyê jî di xwe da dihewînin. Wezna wan bi arûzê ye. Cotserwaya beytan bi şiklê aa, bb, cc ... ye. Her misrayeke beytên herdu berheman jî ji 11 heceyan pêk tê. Ji bo teşe û wezna wan, ji kitêba Abdurrahman Adak hat îstîfadekirin.

Di beyta dudan a Elcewahîrê da heceyên kin bi sembola “+”yê û yên dirêj jî bi sembola “-”yê hatine dîyarkirin:

Selat û hem / selamê bê / nîhayet

\+ - - -    + - - -    + - -

Li ser qafî / le salarê / rîsalet

\+  - - -   + - - -   + - -

**Mefa‘îlun mefa‘îlun fe‘ûlun**

Herfên dengdêr “ê” û “î” dibe ku dirêj, dibe ku kin jî bên bikaranîn. Mela Nurûllah, wezna “Elcewahîrê bi behra hezecê hûnandîye. Qaliba nesalim a berhemê ev e: “Mefa‘îlun mefa‘îlun fe‘ûlun” Her misrayek yanzde hece ne. Wezna pirê mewlûdnameyan û wezna Elhemaîlû Fîşşemaîlîyê, ji ya El Cewahîrê cûda ye. Gelek mewlûdname bi behra remelê, bi qaliba nesalim a Fa‘ilatun fa‘ilatun fa‘ilunê hatine hûnandin.

Wezna Elhemaîlê jî bi behra Muteqarîbê, bi qaliba nesalim, Fe‘ûlun fe‘ûlun fe‘ûlun fe‘ûl e. Di beyta ewil de:

Hezaran / hezar û / hezar qum / riyan

\+ - - + - - + - - + -

Bîla ‘ed / belabil / digel tû / tiyan

\+ - - + - - + - - + -

**Fe‘ûlun fe‘ûlun fe‘ûlun fe‘ûl**

Mela Nurûllah, di herdu berheman da jî qaliba arûzê bi serkeftî bi kar anîye.

## 2.3. Naverokên Herdu Berheman

Herdu berhem jî li ser jîyan û şemaîla pêxember radiwestin. Hem sîyer in, hem wesf û tevger û şemaîla pêxember in. Di El-Hemaîlê de şemaîl zêde hûnandî ye, di El-Cewahîrê de jî sîyer nexasim ğezweyên pêxember, serîyeyên eshabê pêxember, heyetên hatine şandin û yên hatine qebûlkirin û mektûbên pêxember yên ji melîk û qral û serokên dewletan ra hatine şandin zêde cî digrin.

El-Heamîl, dirêj dirêj behsa şemaîla cenabê pêxember û hal û hareketên pêxember dike. Hinek mijarên wê ev in: Exlaqê pêxember çawa bû, çawa xwe boyax dikir, çawa xwe kil dikir, kinc û lîbasên wî çi bûn, razan û nivînên wî çawa bûn, rabûn û rûniştina wî çawa bû, çawa îbadet dikir, çawa rojî digirt, kena wî û girî û henekên wî çawa bûn, sohbeta wî çawa bû, xwarin û vexwarina wî çawa bû, navên pêxember çi ne, carîye û xulamên pêxember kî ne, jin û zarokên pêxember, metik û mamên pêxember kîne, eşya û heywan û dewarên pêxember çi bûn.

Qismê ewil ê berhemê “Di Derheqê Xweşiya Xwedê Da” ye, weha dest pê dike:

**Hezaran hezar û hezar qumriyan**
**Bila ‘ed belabil digel tutiyan**

Beyta dawîn jî weha ye:

**Fe tem-el kelam û we ebdel meram**
**Mîn asarî şîmetî xeyrîl enam**

Mela Nûrûllah bi van beytan armanca nivîsandina El-Hemaîlê dibêje. Îfade dike ku heger berhem bi kurdî be, gelek kes diecibînin, bi evîna pêxember xweşik guhdar dikin.

Ji bona Muhemmed şemaîl bike
Li zendê rîsalet Hemaîl bike

Bi durrê di şehwarê Kurdî bin ew
Gelek goşîwarê di rindî bin ew

Bila seh biken Kurdî ji xas û ‘am
Şemaîl çi ne yê di Xeyr-îl Enam

Çi ku ez dibînim ku pur talib in
Li hubba Nebiyê xwe pur xalib in

El-Cewahîr jî, weha dest pê dike:

Be navê wî Xwedayê layezalî
Emê hemd û sena ken zatê ‘alî

Selat û hem selamê bênîhayet
Li ser qafîle salarê rîsalet

Digel al û sehabê wî kîramî
Şefî’ bin ew temam bo me temamî

Her sê beytên dawîyê jî weha ne:

Selatullah selamullah bîla ‘ed
Li ser rûhê resûlullah Mûḥemmed (w.‘e.s)

Li ser al û li ser eshabê wî hem
Li ezwac û zurrîyatê di wî hem

We hem etba ‘û tevda ummeta wî
Xusûsen çarê yarê hedreta wî

Mela Nurûllah, çima El-Cewahîr hûnandîye, bi van her sê beytan da diyar dike. Îfade dike ku wê demê tu kes di vî warî de nexebitiye, ji ber vê yekê ketye rê.

Ji destê bêkesî ketme pîyasê
Li xwe wergirtîye min vê kirasê

Ji destê bêkesî navê mi mîr e
Çikû rovî di xalî çolê şîr e

Gerandin çehvê xwe lawan nedîn kes
Ji bil vî Nûrîyê naçîz û nakes

Mela Nûrûllah sedema nezmandina bi kurdî, bi van her du beytan nîşan dide:

Bi ezmanê me bit da em bimînin
Kîtabê me bi ezmanê me kêm in

Ji esnafê umem Kurdê me çêtir
Muhîbtir bûn jibo wê xeyrê çêtir

Fîhrîsteyên herdu kitêban û hejmara beytên mijaran weha ne:

**El-Hemaîl**, 46 beş û 5569 beyt in.

1. Di derheqê Xweşîya Xwedê de. 40 beyt

2. Xweşîyên li ser pêxember. 30 beyt.

3. Pêşgotin. 39 beyt.

4. Di derheqê mezinantîya Xwedê de. 55 beyt.

5. Pesndayîna Xwedê ji bo pêxember. 51 beyt.

6. Derheqê bapîrên Wî de ji Adem (‘e.s). 128 beyt.

7. Bi ducanîtîya Wê re hedîseyên qewimîne. 144 beyt.

8. Mizgînîya Çêbûna Pêxember bo hemû kaînatê. 17 beyt.

9. Hedîseyên ku piştî çêbûna pêxember qewimîne. 71 beyt.

10. Şîrdayîna pêxember. 105 beyt

11. Vegera bo Mekkê û teslîma bi dê û bapîrî. 33 beyt.

12. Tiştê rûdane bo pêxember ji fîtamê heta babetê. 103.

13 Zewaca wî bi Xedîce re û te’mîra Ke’beyê. 81 beyt.

14. Çewabûna wehyê û pêwendîyên pê ve. 336 beyt.

15. Hîcreta Ber Bi Medîneya Pîroz ve. 106 beyt.

16. Behsa Daketina Medîneya Pîroz. 179 beyt

17. Xuy û qencîyên dîyar. 325 beyt.

18. Tevgerên wî yên pakîze. 44 beyt.

19. Boyağkirina Wî. 16 beyt.

20. Kilkirina Pêxember. 13 beyt.

21. Lîbas û Wergirtina Pêxember. 122 beyt.

22. Nivînên Pêxember. 32 beyt.

23. Razana Pêxember. 37 beyt.

24. Rabûn û rûniştina Pêxember. 26 beyt.

25. Îbadet û xwendina Pêxember. 64 beyt.

26. Rojîya Pêxember. 29 beyt.

27. Ken û Girîya Pêxember. 49 beyt.

28. Mîzaca Pêxember. 48 beyt.

29. Tewazûa Pêxember. 67 beyt.

30. Xeyset û Axaftina Pêxember. 97 beyt.

31. Xwarin û vexwarina pêxember. 136 beyt.

32. Vexwarin û Çewabûna Vexwarina Pêxember. 44 beyt.

33. Darûtîya Nexweşîyan. 78 beyt.

34. Bîhnxweşîya Ji Pêxember. 25 beyt.

35. Xulq û Heya Pêxember. 139 beyt.

36. Navên Pêxember. 475 beyt.

37. Di heqê Carîye û Jîn û Zarokên Pêxember de. 233 beyt.

38. Koleyên ku Pêxember ew azad kirine. 18 beyt.

39. Mam û Metên Pêxember. 13 beyt.

40. Alavên Pêxember. 136 beyt.

41. Sewal û Dewarên Pêxember. 52 beyt.

42. Alavên şer ên Pêxember. 31 beyt.

43. Xîmê Xanîyê Pêxember. 46 beyt.

44. Dahatina Hin Ayetan û Mû'cîzatên Pêxember. 959 beyt.

45. Wefata Pêxember. 469 beyt.

46. Xatîme / Hêvîya Qencîyên Ji Xwedê. 226 beyt.

**El-Cewahîr**; 174 beş in, 5024 beyt in.

1. Bîsmîllah. 6 beyt

2. Sebebê nezma kitêbê. 89 beyt

3. Di heqê Nesebê Şerîf de. 26 beyt

4. Weqta hemla Wî û Tarîxa Wîladeta Wî. 40 beyt

5. Behsa 'elametên piştî wîladeata wî. 16 beyt

6. Dayikên şîr, hewandina wî, li ser wefata dê û bav. 41 beyt

7. Dema diçe Bûsrayê û rahîban ji bo wî çi gotine. 24 beyt

8. Dîsa derketina ji Mekkeyê bi bal Bûsrayê ji bo tîcareta Xedîce (R. Enha). 10 beyt

9. Zewaca bi Xedîce re û ji nû de avakirina Ke'beyê. 18 beyt

10. Wezîfa wî ya pêxembertîyê. 98 beyt.

11. Mî'raca pêxember. 304 beyt.

12. Muslumanbûna Ensar (razîbûna Xweda li ser wan be). 23 beyt

13. Hîcreta bal Medîneyê. 106 beyt

14. Diyarkirina azanê. 29 beyt

15. Ğezweyên wî, Ğezweya Ebwaê. 7 beyt

16. Ğezwa Bûwatê. 6 beyt.

17. Ğezwa 'Uşeyreyê. 9 beyt

18. Ğezwa Sefwan. 4 beyt

19. Guherandina Qiblê. 9 beyt

20. Ğezwa Bedrê a mezin. 324 beyt

21. Ğezwa Benî Selîmê. 8 beyt

22. Ğezwa Benî Qeynûqayê. 20 beyt

23. Ğezwa Sewîqê. 12 beyt

24. Ğezwa Ğetefanê (Zîemr). 22 beyt

25. Ğezwa Behranê. 7 beyt

26. Ğezwa Uhûdê. 213 beyt

27. Ğezwa Hemrael Esedê. 31 beyt

28. Ğezwa Benî Nadir. 44 beyt

29. Ğezwa Zaturrîqayê. 30 beyt

30. Ğezwa Bedrê ya Paşîn. 32 beyt

31. Ğezwa Dewmetul Cendelê. 11 beyt

32. Ğezwa Mureysî'yê. 92 beyt

33. Ğezwa Xendeqê. 149 beyt

34. Ğezwa Benî Qureyzeyê. 57 beyt

35. Ğezwa Benî Lîhyanê. 5 beyt

36. Ğezwa Ğabehê. 24 beyt

37. Ğezwa Hudeybîyeyê. 173 beyt

38. Ğezwa Xeyberê. 133 beyt

39. Ğezwa Wadîl Qurayê. 20 beyt

40. 'Umreya Qeza. 57 beyt

41. Ğezwa fetha Mekkeyê ku Xuda şeref dayê. 304 beyt

42. Ğezwa Huneynê. 88 beyt

43. Ğezwa Taîfê. 72 beyt

44. Ğezwa Tebûkê. 82 beyt

45. Serîyeyên wî (56 in). 7 beyt

46. Serîya Hz. Hemze (R. ‘e). 13 beyt

47. Serîya ‘Ubeyde bin Hers bîn Muttelîb ji bo Rabîğê. 8 beyt

48. Serîya Se’d bîn Ebî Weqqas bi hêla Xerarê ve. 3 beyt

49. Serîya ‘Ebdullah bîn Cehş ji bo newala Nexleyê. 28 beyt

50. Serîya ‘Umeyrîl ‘Emr bîn ‘Ebdî. 6 beyt

51. Serîya Salîm bîn ‘Umeyre. 8 beyt

52. Serîya Mûhemmed bîn Mesleme. 30 beyt

53. Serîya ‘Ebdullah bîn ‘Etîk. 21 beyt

54. Serîya Zeyd bîn Harîse ji bo Qardeyê. 7 beyt

55. Serîya Ebî Seleme ‘Ebdullah bîn ‘Ebdulesed ji bo Qetenê. 7 beyt

56. Serîya ‘Ebdullah bîn Uneys Cuhemî. 19 beyt

57. Serîya Asim bîn Sabît. 26 beyt

58. Serîya Qurraê bal Bîra Mu’ewneyê. 16 beyt

59. Serîya Mûhemmed bîn Muslîme ji bo Qurtaê. 7 beyt

60. Serîya ‘Ukaşe bîn Mehsîl Esedî. 6 beyt

61. Serîya Mûhemmed bîn Muslîme ji bo Zîlqisseyê. 12 beyt

62. Serîya Zeyd bîn Harîse bi ser Benî Selîme. 5 beyt

63. Serîya Zeyd bîn Harîse bi bal Îsê. 16 beyt

64. Serîya Zeyd bîn Harîse bi bal Terfê. 4 beyt

65. Serîya Zeyd bîn Harîse bi bal Hismê. 31 beyt

66. Serîya Zeyd bîn Harîse bi bal Wadîl Qurayê. 3 beyt

67. Serîya ‘Ebdurrehman bi bal Dewmetul Cendel. 14 beyt

68. Serîya ‘Elî bîn Ebî Talîb bi ser Benî Se’d bîn Bekr. 10 beyt

69. Serîya Zeyd bîn Harîse ji bo Ummî Qirfê. 14 beyt

70. Serîya ‘Ebdullah bîn Rewaha. 23 beyt

71. Serîya Kurrez bîn Cabîr Fîhrî. 14 beyt

72. Serîya ‘Emr bîn Umeyye Demrî ji bo Ebû Sufyan. 31 beyt

73. Serîya Omer bîn Xettab bi ser Turbetê. 4 beyt

74. Serîya Ebû Bekrê Siddîq. 5 beyt

75. Serîya Beşîr bîn Se’d Ensarî. 12 beyt

76. Serîya Ğalîb bîn ‘Ebdullah Elleysî ji bo Meyfe’ê. 10 beyt

77. Serîya Ğalîb bîn Ebdullah Elleysî ji bo Mulûhê Kedîdê. 19 beyt

78. Serîya Ğalîb bîn Ebdullah Elleysî ji bo Fedekê. 14 beyt

79. Serîya Şûca’ bîn Wehb Esedî. 7 beyt

80. Serîya Ke’b bîn ‘Umeyr Ğefarî. 10 beyt

81. Serîya Mu’teyê. 63 beyt

82. Serîya ‘Emr bîn ‘As ji bo beldeyên Belîw ‘Uzreyê. 14 beyt

83. Serîya Xebtê. 17 beyt

84. Serîya Ebî Qatade bi bal Necdê. 9 beyt

85. Serîya Ebî Qatade bi bal Îdemê. 11 beyt

86. Serîya Xalid bîn Welîd bi bal Nexleyê. 17 beyt

87. Serîya ‘Emr bîn ‘As bi ser pûtê Suwa’. 13 beyt

88. Serîya Se’d bîn Zeyd Eşhelî bi ser pûtê Menat. 7 beyt

89. Serîya Ebî ‘Amr Eş’erî bi bal Ewtasê. 7 beyt

90. Serîya Tufeyl bîn ‘Emr Dewsî ji bo Zulkefeynê. 7 beyt

91. Serîya Qeys bîn Se’d bi bal Suda’. 9 beyt

92. Serîya ‘Uyeyne bîn Hisn Fezarî ji bo Benî Temîm. 18 beyt

93. Serîya Welîd bîn ‘Uqbe ji bo Benî Mustelîq. 14 beyt

94. Serîya Ebdullah bîn Ewsece ji bo Benî Emr bîn Harîse. 7 beyt

95. Serîya Qutbe bîn Amr Xezrecî ji bo Xes’emê. 7 beyt

96. Serîya Dehhak bîn Sufyan Kilabî ji bo Benî Kulabê. 3 beyt

97. Serîya ‘Elqeme bîn Muczîr Mudlîcî ji bo Hebeşîyên Taîfê. 5 beyt

98. Serîya ‘Elî (R. ‘e) bi ser pûtê Felsa Teyyî. 10 beyt.

99. Serîya ‘Ukaşe bîn Muhsîn Esedî bi bal Cîbabê ‘Uzretê. 2 beyt

100. Serîya Cureyr bîn ‘Ebdullah Becelî bi bal Zîlxelesetê. 7 beyt.

101. Serîya Usame bîn Zeyd bi bal Ubnayê. 57 beyt

102. Qasidên wî. Şandina Ebûbekrê Siddîq ji bo însanên li heccê. 11 beyt

103. Ebû Musa el-Eş’erî û Mûaz bîn Cebel dişîne Yemenê. 11 beyt

104. Xalid bîn Welîd dişîne Benî ‘Ebdulmedanê Yemenê. 9 beyt

105. Elî bîn Ebî Talîb dişîne Yemenê. 16 beyt

106. Hecca Weda’ê. 12 beyt

107. Heyetên hatine ba pêxember. 7 beyt

108. Hey’eta Nesranî ên Necran. 10 beyt

109. Hey’eta Temîmê Darî. 9 beyt

110. Hey’eta Seqîfê. 16 beyt

111. Hey’eta Benî Amir bîn Se’se’. 20 beyt

112. Hey’eta Demam bîn Su’lebe. 10 beyt

113. Hey’eta Ebdulqeys. 10 beyt

114. Hey’eta Benî Henîfeyê. 20 beyt

115. Hey’eta Teyy. 6 beyt

116. Hey’eta Edî bîn Hatemê Taî. 10 beyt

117. Hey’eta Urwetîl Muradî. 4 beyt

118. Hey’eta Benî Zubeydîyê. 4 beyt

119. Hey’eta Kende. 6 beyt

120. Hey’eta Ezdîşenûe’. 14 beyt

121. Hey’eta Qasid Haris bîn Kelal. 5 beyt

122. Hey’eta Qasid Ferwe bîn Emr Cizamî. 5 beyt

123. Hey’eta Haris bîn Ke’b. 3 beyt

124. Hey’eta Rifa’ bîn Zeyd Xuzaî. 4 beyt

125. Hey’eta ji Hemedanê. 6 beyt

126. Hey’eta Qebîla Tucbîyê. 11 beyt

127. Hey’eta Benî Su’lebeyê. 7 beyt

128. Hey’eta Benî Se’d Huzeymeyê Qudae’yê. 7 beyt

129. Hey’eta Benî Fezareyê. 11 beyt

130. Hey’eta Benî Esedê. 5 beyt

131. Hey’eta Benî Uzreyê. 9 beyt

132. Hey’eta Benî Belîy. 4 beyt

133. Hey’eta Benî Murreyê. 8 beyt

134. Hey’eta Xewlanê. 6 beyt

135. Hey’eta Benî Muharîbê. 7 beyt

136. Hey’eta Suda’ê. 13 beyt

137. Hey’eta Ğessanê. 2 beyt

138. Hey’eta Sulaman. 8 beyt

139. Hey’eta Benî ‘Ebsê. 5 beyt

140. Hey’eta Muzeyneyê. 5 beyt

141. Hey’eta Şa’iran. 4 beyt

142. Hey’eta Dewsî. 17 beyt

143. Hey’eta Tariq bîn Ebdullah Muharîb. 13 beyt

144. Hey’eta Behzayê. 10 beyt

145. Hey’eta Ğamidê. 6 beyt

146. Hey’eta Ezdîyan. 5 beyt

147. Hey’eta Benî Muntefîqan. 4 beyt

148. Hey’eta Nexe’. 15 beyt

149. Mektûbên wî ji bo melîkan û serokan. 13 beyt

150. Mektûba ji Qeyserê Rûmê re. 34 beyt

151. Mektûba ji Kîsrayê re. 18 beyt

152. Mektûba ji Necaşîyê Hebeş re. 11 beyt

153. Mektûba ji Muqewqis re. 13 beyt

154. Mektûba ji Munzîrê Temîmî re. 9 beyt

155. Mektûba ji zaryên Culendî yê Umman re. 7 beyt

156. Mektûba ji Hewze bîn ‘Elîyê Henîfîyê Yemamê re. 11 beyt

157. Mektûba ji Hers bîn Ebî Şemr Xessanî re. 10 beyt

158. Mektûba ji Benî Nehdê re. 6 beyt

159. Mektûba ji Zîlmi’şarê Hemedanî re. 5 beyt

160. Mektûba ji Qeten bîn Harîsê Elîmî re. 5 beyt

161. Mektûba ji Waîl bîn Hucer re. 6 beyt

162. Mu’cîzatên Wî. 153 beyt

163. Wesfên Zatê Şerîf. 107 beyt

164. Wefata wî. 119 beyt

165. Xanimên wî. 29 beyt

166. Zarokên wî. 12 beyt

167. Metik û apên wî. 16 beyt

168. Koleyên wî ên azad bûne. 14 beyt

169. Xizmetkarên wî, mûhafizên wî. 12 beyt

170. Katibên wî, emîrên wî. 13 beyt

171. Şûrkêşên wî, muezzînên wî, şa'irên wî. 20 beyt

172. Sîlehên wî, lîbasên wî, eşya ên wî. 121 beyt

173. Paşgotina kitêbê. 20 beyt

174. Pendname (Nesîhetên li 'ewam). 177 beyt

## 2.4. Analîza Fîhrîsteyan

Di El-Hemaîlê da 46 qism hene, heta çûna Medîneyê û li Medîneyê hinek hedîseyên qewimîne, bi kurtasî têne behskirin. Mîsalen mî'raca pêxember bi qasî nêzî 50 beytî hatiye nezmandin. Behsa jîyan û tevger û alav û ehlê pêxember, cîyeke mezin digre. Mîsalen wefata pêxember 469 beyt in. Behsa ğezwe û serîye û mektûbên ji bo teblîğa Îslamê, heyetên hatine şandin û qebûlkirin cî nagrin. Lê xûy û wesf û mu'cîzeyên pêxember gelek cî digrin. Her weha ji wîladetê heta zewaca bi Xedîce re jî, li gorî El-Cewahîrê, dirêjtir e. Qismê bi navê "Navên Pêxember" 475 beyt in. Di heqê Carîye û Jîn û Zarokên Pêxember de 233 beyt hatine nivîsandin. Bi 128 beytan behsa bav û bapîrên wî dike. Her çiqas 46 qism hebin jî, hinek qisim gelek mijaran di xwe de dihewînin. Mî'rac bi sernavekî serbixwe nehatîye nezmandin. Di nav qismê 15an da cî digre. Hedîseyên piştî hîcretê di qismê 16an de peyde ne, lê ne ewqas dirêj in.

Di El-Cewahîrê da 174 qism hene. Tê da dewra Mekkeyê, li gorî El-Heamîlê, dirêjtir hatiye behskirin. Mîsalen mî'raca pêxember 304 beyt in, lê wefata pêxember 119 beyt in. Behsa nesebê wî, 28 beyt in. Dewra Medîneyê nexasim ğezwe û serîye, mektûbên teblîğê, heyetên hatine û qebûlkirin û şandin, dirêj û berfireh hatine hûnandin. Hemî ğezwe bi 2045 beytan, temamê serîye bi 774 beytan, heyetên hatine şandin û hatine qebûlkirin bi 398 beytan, mektûb jî bi 50 beytî hatine nezmandin. Di dawîyê de qismekî şîretên li xelkê (pendname) heye û ji 177 beytan pêk tê.

Di El-Cewahîrê da ji alîyê sîyerê va ji dewra Mekkeyê mijarên mîna Hilfûl Fudûl, ciwanîya cenabê pêxember kurt in. Te'deyên li eshab, teblîğa eshab, îslambûna ehlê Mekkê, hîcreta bi bal Habeşîstanê ve, sefera Taîfê zêde nehatine hûnandin. Piştî hîcretê li Medîneyê jî têkilî û elaqayên nav bajêr û ên bi yehûdîyan re, li Medînê dewleta Îslamê çawa ava bûye, Wesîqa peymana Medînê, meselên aîlevî û ekonomîk û 'îbadetê, terbîye û gihandina zarokên muslumanan û sehabên pêxember, nuzûla ayet û sûreyan, mijara nivîsa ayetên Qur'anê, bi berfirehî nehatine nezmandin.

Bi kurtasî di El-Hemaîlê da şemaîl û exlaqê pêxember li pêş e, di El-Cewahîrê da jî sîyer û dewra Medîneyê zêde cî digrin.

## 2.5. Zimanê Herdu Berheman

Mela Nurûllah, alimê hêla Bedlîsê ye. Li derdora Mûşê jî umir borandîye. Jîyana wî li nav medreseyan, bi melatî derbas bûye. Ji ber vê yekê lîsanê wî, yê xwendinê ye, yê vê herêmê ye. Di eserên wî de zimanê zêde dîyar, zimanê hêla Serhedê ye û devoka Botî ye. Bi bandora medreseyê û 'ilmê Îslamî, peyvên erebî bi kar anîne. Bi vî zarî, xîtabî telebeyên medreseyê kirîye, hem jî ehlê dora wî jê fêm kirine.

Herdu eser, bi kurdîya hêla Serhed û Sêrtê derdikevin pêş. Wezna wan bi arûzê ye. Peyvên 'erebî, peyvên farisî, peyvên tirkî di wan de bi hejmarekê hebin jî, kurdîya ku bi kar anîye, pir dewlemend e. Di beytan de, peyvên îro nayên gotin an jî kêm tên gotin, reşandine. Dibe ku ji wan hinek herêmî bin, feqet bi vî şiklî ew peyv muhafaza bûne. Her weha nîşan dide ku bi devoka gelek herêma dizane. Hinek nimûne li vir hatine rêzkirin. Ji bona wateyên wan, ji ferhenga Zana Farqînî hat îstîfadekirin.

"Nişûv"ê bi me'na serberjêrîyê, "bêzî"yê bi me'na nefretkirinê, "hokehok"ê bi wateya axaftina şivên bi pezê xwe re, "çapik"ê jibo hijdînê, "êvişandin"ê ji bo texsîrkirinê, "bîşî"yê ji bo şewlayê, "çarmêlikî"yê ji bo çarmêrkîya şeklekî rûniştinê, "hilakirin"ê ji bo bidestxistinê, "hîrebûn"ê ji bo hînbûnê, "ferseng"ê ji bo merhaleyê an jî pêvajoyê, "boş"ê ji bo geş û gûrbûnê yan jî bi qûwetê, "hinartin"ê ji bo şandinê, "periştin"ê ji

bo teftîşkirinê, “kudandin”ê ji bo bireveçûyînê, “qerzîl”ê bi me’na pel, “çilop”ê ji bo parîyê, “hingeding”ê ji bo qerepereyê,”kencaf”ê ji bo şemateyê, “nihandin”ê ji bo bidawîkirinê, “rabestin”ê ji bo hazirîya li hember tiştekî, “pîgar”ê ji bo destekdayînê, “qepaçe”yê ji bo dorpeçîyê, “rahiştin”ê ji bo hilanînê, “riha”yê ji bo xelasîyê, “tekakirin”ê ji bo ‘effûkirinê, “tewtewe”yê bi me’na ji tiştekî re nabe, “vewestin”ê ji bo daxwazîyê, “pêşrewan”ê bi me’na reîs, “sil”ê ji bo tirsînê, “vijî”yê ji bo valabûnê, “kespik”ê ji bo morîkên nezerê, “qerizî”yê ji bo qerimînê, “zimanawer”ê ji bo fesahet û belağetê, “zo”yê ji bo encaxê bi me’na bizorê (di wê de herfa ryê ketîye ji bo nezmê), “tîrhingiv”ê ji bo tîravêtinê hatine bikaranîn. Her weha dibêje “zikê defterê” Ev bi me’na hundirê defterê ye. Ehlê Farqînê peyva “zik”ê ji bo nava tiştekî bikar tînin. Dîsa dibêje “welê” Herêma Botan û ehlê Hekkarî vê peyvê bi me’na “wisa, wilo, weha” de dibêjin.

Ji ber ku bi devoka Serhedê ya hêla Bedlîs û Mûşê nivîsandîye, peyvên tirkî jî bikar anîne. Wekî tê zanîn, Şêx Ehmedê Xanî jî ji bo hunerê di helbestên xwe de hinek peyvên tirkî bi kar anîne. Hinek peyvên tirkî yên berhemê ev in: orta, ade(ada), loqme(loqma), qarşî(karşı), qilawûz, înan(inanmak) bayloz(balyoz), beyraq(bayrak), çop, bilûk(bölük), çapa(çaba), qoç(koç), mendîl, lanbe û fener, kaxid(kağıt), salî(salı), boğaz, tawe(tava), dizgun(düzgün), çamûr(çamur), didîqodî(dedikodu), sax(sağ taraf), topkirin(toplama), degişkirin(değiştirmek), taze, yaniş(yanlış), geber, kotî(kötü), yoldaş, dîlek(dilek), doşek(döşek), çayir/çîmen(çayır/ çimen), başqe(başka), dizgîn(dizgin), zop(sopa), yexme(yağma), êpe(epey), engel, gemîcî(gemici), temîz(temiz), yardım, yatax(yatak).

Zimanê farisî, zimanekî ehlê medresê ye. Nexasim ji bo şi’rê tê hînkirin. Di herdu berheman de peyvên farisî jî hene, hinek daçekên farisî jî hatine bikaranîn. Ji wan hinek daçek ev in: “Der” ji bo “li”yê, “be, ba”yê ji bo “bi”yê, “ez”ê ji bo “ji”yê gotiye. Hinek peyv jî weha ne: “bed”ê ji bo xerabîyê, “nehwêt”ê ji bo nodîyê, “sîlehşor”ê ji bo kesê çekdar, “dirûx”ê ji bo derewan, “salar”ê ji bo kesên mezin û qedirbilind, “gûş û goşîdar”ê ji bo guh û kesê guhdar, “şîr”ê ji bo şêr, “nîk”ê ji bo xweşîyê, “zuban”ê bi me’na zimanê, “xedenfer”ê ji bo ğezanferê, “daniş”ê ji bo ilm û zanyarê, “dîger”ê ji bo tiştê dîtirê, “kemalateş”ê bi me’na kamilîyên wî,

“lahorî” ji bo şûrekê, “sîpah”ê ji bo leşkerê, “zîndeganî”yê ji bo jîyanê, “hergîz”ê ji bo teqezê, “xub”ê ji bo başîyê, “peyember”ê ji bo kesê pêxember gotîye.

Di herdu berheman da hinek xisûsîyetên din ên zimanê Mela Nurûllah weha ne:

**1.** Hinek peyvên ne kurdî, li gorî qalib û sivikahîya zimanê kurdî guherandine. Mîsal, di El-Hemaîlê de li ser wechê pêxember weha dibêje: (El Hemaîl)

Eger bêjî bedr e, tu pur yaniş î
Û ger bêjî roj e, tu pur bêhiş î

Di vê beytê de yaniş, peyveke tirkî ye. Bi eslê xwe “yanlış” e, lê ji bo wezn û sivikahîya bi gotina kurdî, bi awayê “yaniş” bi kar anîye.

**2.** Ehlê Botan, herfa “t”yê tînin pey fiîlan weha dibêjin “diçit yanî diçe, dikêşit yanî dikêşe, bimînit yanî bimîne” Di herdu berheman de bi vî rengî mîsal hene. Li jêr mîsalên wan hatine dayîn. Ehlê Bedlîsê jî “çan”ê di şûna “çawan”ê de dibêjin yanî peyvê kurt dikin. Her weha “hîre”yê jî ji bo ‘elimandinê dibêjin. Li jêr bi beytan nimûne hatine dayîn.

Divêtin ku xewas ê canbazî bit
Be şuphê qelem tûlê çend gazî bit (ElHemaîl)

Ewê hamî jibo wî her Xuda bit
Qilawûzê wî çawan jê cuda bit

Musulman bûn û hem ehkamê dînî
Hemû jî hîre bûn xûb û şirînî (Elcewahîr)

**3.** Di herdu berheman de daçeka “di”yê mîna helbestvanên klasîk hatiye bikaranîn. Mîsalên wan li jêr in:

Hemû ehdê di wî mîsaqê wan bû
Hemû cehdê di wî ewsaqê wan bû (Elcewahîr)

Guhê wî şîyar e li zarê di me
Gelek dilfikar e ji barê di me (Elhemaîl)

Ev morfema “di”yê ku di klasîkan de heye, ji bo tekîdê ye. Ji bo vê meriv dikare li gotara Hayreddin Kızil binêre ya derbarê

vê morfemê de. Nevîyê Mela Nûrûllah, Cihat Bakırhan ji bo vê daçekê gotibe “pêveka piraniyê” ye jî beyta li jêr vê gotina wî rast nake. Di beytê de “şems” ji bo yekjimarîyê hatîye gotin.

**Çikû şemsa di wan hey bêzewal e**

**4.** Xisûsîyeteke din a zimanê Mela Nûrûllah weha ye: Ji dêleva “ji wî ra” dibêje “ji bo ra” Her weha carna ji bo “ji te re” gotîye “ji ta”

Jibo ra anî Cebraîl du tasek

**5.** Mela Nûrûllah carna qertafa “ê”yê, tîne pey fiîlan. Bi vî awayî hem lêkerê hem jî cînavkê pevre bi kar tîne. Di vê misrayê de mîsaleke xweşik heye.

Digotanê jinê ‘eyla hevalan

(Dema Helîmê ew birîye nava malên gund, ji Helîmê re gotine jinên aîleyên hevalên wê. Digotanê yanî digotin wê, ji wê re digotin)

**6.** Helbest sivikahîyê dixwaze, ji lew carna peyv tên kinkirin. Hem wezin diedile hem jî herikbarî çê dibe. Ji ber vê yekê carna peyvên herêmî hatine bikaranîn. Mela Nûrûllah di şûna “Qur’ana me”yê de gotiye “me Qur’an”, ji bo “bigerîne”yê dibêje “gêre” Ev herdu misrayên cûda nimûne ne:

Me Qur’an, nasixê her defteran e / We go min gêre bo her hîle serbest

**7.** Di herdu eseran de carna bêjeyên erebî, bi qertafên kurdî hatine darijtin. Mîsalen peyva “şemm”ê bi me’na bînkirinê ye. Qertafa “and”ê hatîye paşîyê, bûye “şemmandî” Nimûneyeke din “rekîb” e, wateya wê “siwarî” ye. Qertafa “dar”ê hatîye dawîyê û bûye “rekîbdar” ku bi wateya kesê lê siwar bûye.

Rekîbdarê wî Cebrîlê emîn bû

**8.** Mela Nurûllah, di hinek cîyan de guh nedaye zayenda peyvan.

Gotîye “nûrê îmanê” “nûr” mê ye, lê weka ku nêr be bi kar anîye. Lazim bû “nûra îmanê” bi kar bianîya.

Her weha dibêje "… sedayê xwe …." "Seda" peyvek erebî ye û mê ye, divê bigota "sedaya xwe"

"Av" peyveke kurdî ye û mê ye. Lê gotîye "…vê avê hanê" "Av"ê wek nêr îstî'mal kirîye. Lazim bû bigota "vê ava hanê"

Di vê risteyê de "Di Îslamê eva talanê ewil" "talan" mê ye, feqet nêr hatîye bikaranîn. Divê bigota "talana ewil"

Gotîye "… îmanê safî" di cîyekê de. Her weha gotîye "baranê rehmet" Di van misrayan de "îman" û "baran" herdu jî mê ne, lazim bû bigota "îmana safî" û "barana rehmet"ê.

**9.** Di herdu eseran de Mela Nûrûllah li gorî qaîdeyên ergatîvîyê neçûye. Li hin deveran xweşik edilandiye, li hinek cîyan jî ji bona wezn û ahengê ev rêzik neemilandîye. Di ergatîvîyê de risteyên demên borî ger bireserê bihewînin, meriv lêkera derbasok, bi awayê bireserê dikişîne. Bireser nayê tewandin û yekjimar be, fiîl jî dibe yekjimar, bireser pirjimar be, lêker dibe pirjimar. Hinek nimûneyên berheman ev in:

**Dema wildî diya wî şîrî daê**

Kelîmeya "şîr" bireser e û nêr e. Ji ber ku dema risteyê dema borî ye, hewce bû nehata tewandin. Me'neya misrayê weha ye: Dema welidî, dîya wî şîr daye wî.

Ji wana şewqê da ser ummetê jî
Temam hildan bi wî hem dewletê jî

Di herdu misrayan de kelîmeyên "şewq", "ew" û "ummet"ê bi awayê rast tewîyane. Lê kelîmeya "dewlet"ê ji ber ku bireser e, lazim bû netewîya. Sedema tewandina wê, ahenga nezmê ye.

Nebî wê riha kir ji qeyd û ji bend
Be te'cîl û lez çû ewê derdemend

Di misra pêşîn a beytê de dem dema borî ye. Kirde "Nebî" ye, fiîl "riha kir" e, bireser jî "wê" ye ku ji bo ğezalekê hatîye bikaranîn. Lazim bû "wê" nehata tewandin û weha ba: Nebî ew riha kir

**10.** Mela Nurûllah li ser bûyeran hestên xwe dîyar kirine di beytan de. Bi xweşî û şahîya eshab û pêxember, bi dilşadî

nivîsandîye, di cîyên huznê de jî bi dilhezînî nezmandîye. Li ser wîladeta cenabê pêxember weha dilşad dibe:

Di pansed heftê û yek ref'ê 'Îsa
Li esmanan li me fanos teyîsa (Elcewahîr)

Yanî di 571ê mîladî de li asîmanan li me fanos binûr û ronî bû.

Ji bo şehîdbûna Hz. Hemze, dilêşîya xwe tîne ziman. Me'na beyta wî weha ye: Zêde zor û giran bû ew felaketa hanê. Hey wax dîsa hey wax û dîsa heywax.

Di El-Hemaîlê de jî li ser mî'raca pêxember, kêfxweşîya xwe weha nezm dike:

Mubarek mubarek be çûyînê 'erş
Mubarek mubarek be tezyînê ferş

Henîen ji bona te mîhmanîyan
Henîen ji bona te dildarîyan

## 2.6. Hûnandina Heman Mijarê Di Herdu Berheman Da

Mela Nurûllah, di herdu berheman da her çiqas li ser heman mijarê hûnandibe jî, awayê nezmandinê hinekî ji hev cuda ye. Hem îfadeyên ku ji bo mijarê bi kar anîne, hem jî awayê hûnandinê ne wekî hev in. Lê belê tiştê ku dibêje yên di herdu berheman da, ji alîyê rastî û saxlembûnê va ne ziddî hev in. Li gorî wezn û ahengê, nezmandîye. Ger hinek peyv û qalib eynî bin jî, bi heman awayî negotîye. Dirêjahîya mijarê jî ne qasî hev in. Li jor behsa kinbûn û dirêjahîya mijaran hatibû kirin. Ji bo mîsalê meriv dikare weha bêje:

Di herdu berheman da li ser nesebê pêxember sekinîye. Di El-Hemaîlê da ewilî bangî qelemê dike, behsa xuliqandina cennet û tiştên dike. Tîne ziman ku melek ji Teybeyê (Medîneyê), ji cîyê qebra pêxember hinek ax tînin, dibin cennetê. Xweda, Hz. Adem ('e.s) ji wê axê çê dike. Paşê şandina Hz. Adem û Hz. Hewa bal dinyayê va, hevdîtina wan dinezmîne, mesele bi vî awayî dirêj dibe. Dûre jî ji Hz. Adem heta pêxemberê me behsa sîlsîleyê dike.

Lê di El-Cewahîrê da ji pêxemberê me Hz. Mûhemmed (s.'e.w) behs dike, heta Hz. Adem sîlsîleyê dibêje. Îfadeyên nezmandinê jî ji hev cuda ne. Di herduyan de jî dide zanîn ku ji pêxember heta 'Ednan, bê îxtîlaf e, lê ji 'Ednan pê ve xîlaf heye. Her weha di herduyan da jî beyan dike ku nesebê pêxember pak û paqij e, kesekî facir ji wan tuneye.

Di El-Cewahîrê da hinek neseba cenabê pêxember bi rêzê weha derbas dibe:

Xuzeymeyê lawê Mudrîkeyê lawê Îlyasê lawê Mudarê lawê Nezarê lawê Mueddê lawê Ednan. Her weha dibêje ku tev jî ehlê nîkaha şer'ê ne, ji wan tu facir û kesê bi uzir tune ye, li ser wan cahiltî û bîdat jî tune ye. Dîsa dibêje ku ji Ednan heta Adem di rîwayetan de îxtîlaf heye.

Di El-Hemaîlê da jî weha derbas dibe:

Ji Adem heta tê ebê 'alîcah
Di wan da nebûne nîkahê gunah

Kî yanî hemû wefqê meşrû'î bûn
Di şer'a zemanê xwe mesmû'î bûn

Ji Adem heta tê û digihêje Sam
Ji 'Ednanî jî ta be Xeyrîl Enam

Heqîqet yeqîn e, bîla xulf û meyn
Welêkin ji 'Ednan heta Samî beyn

Gelek tê hene qal û qîl û şîqaq
Meger çênebûye li wan îttîfaq

Mîsaleke din, li ser mu'cîza pêxember a ku bi xwestina wî hêv dibe du şeq. Mesele di El-Hemaîlê da dirêjtir tê nezmandin. Di El-Cewahîrê da bûyera ku hatîye nezmandin weha ye: Pêxember îşaretî hêvê dike û hêv dibe du şeq. Li asîman du felqe ji hev diqetin. Hemî kesên li cem wî lê dinêrin û dibînin. 'Ecêbmayî dimînin, rêya înkarê nabînin. Çareyê nabînin, lê dîsa dibêjin sîhr e, kîtaba wî jî şî'r e. Ebû Cehîl û hinek kesên xerabemel, înkar dikin hadîseyê. Ewan xerabpeyv dibêjin, ka ji xelkê hêlên din jî bipirsin, gelo ka wan jî dîtîye yan na. Eger ğeyrî wan, ehlê deverê welatên din jî dîtibin, rast e û tê de şuphe û gûman tune ye. Ji kê dipirsin, dibêjin bi tehqîq rast e. Digel vî qasî jî hedîseyê tesdîq nakin.

Di El-Hemaîlê da jî nezma mu'cîzeya şeqqul qemer weha derbas dibe:

Ku dîtin îşaret be tilya xwe kir
Be heybet nezer da heyîva bedir

Çi binhêrinê ku heman bû du şeq
Reew hû 'eyanen îza ma'n feleq

Ji hev dûrî bûn herdu qit'e gelek
Xwedînûrî bûn herdu jî hem gelek

Xuya kir di mabeynî wan da Hîra
Be tekzîbê kezabekan da nîda

Nebî gote wan: Dê nezer lê biken
Bibînin û tekzîbê êdî nekin

Meger dilsîyahan xwe teslîm nebûn
Bi vê dersê hingame te'lîm nebûn

Digotin ewan kafirê kultenişt
Meger sihrê te ba sema jî gehişt

Ji vê mîsalê jî xuya ye ku Mela Nurûllah, di nezmandina heman mijarê de ewqas hosta ye, eynî heqîqetê bi îfade û gotinên cûda, dikare li hev xweş biedilîne.

### 2.7. Deng Li Qelemê

Mela Nurûllah, di herdu berheman da bangî qelemê dike. Deng li qelemê gelek me'neyan dihewîne. Yek jê, adeteke berîya Mela Nurûllah e. Gelek alim û şairên medreseyan di helbestên xwe bangî qelemê kirine. Nexasim Şêx Evdirehmanê Axtepî di Rewdîn Neîma xwe da gelek caran bangî qelemê dike. Mela Nurûllah bi vî awayî nîşan daye ku li ser rêçika alim û şairên berî xwe ye. A dudan, bi vê bangê girîngîya mijarê derdixîne holê. Mîsalen mî'raca pêxember di sîyerê da babeteke pir girîng e. Ji lew hem Axtepî hem Godişkî, ev mijar bi banga li qelemê dest pê kirine. A sisîyan jî, şair bi şiklekî bangî nefsa xwe, dilê xwe dike daku di hûnandinê da jîr û jêhatî be.

Mela Nurûllah di herdu berheman da jî bangî qelemê kirîye. Lê di El-Hemaîlê de zêde bi kar anîye. Mîsalen di yekser qismê pêşgotinê da gazî qelemê dike. Dîsa di qismê “bapîrên pêxember”, “xûy û qencîyên dîyar” da jî gazî qelemê dike. Di qismê “çewabûna wehyê û pêwendîyên pê ve”, “dahatina hin ayet û mû’cîzatên pêxember” û qismê dawîyê da dîsa berfireh deng li qelemê dike. Di qismê pêşgotina El-Hemaîlê da çend beyt weha ne:

Qelem! Dîlberê, sergiranî meke
Qelem! Şatirê, tu tewanî meke

Qelem, nam û namûs î bo merdûwan
Qelem, calînûs î di fikrê giran

Qelem, sermîyan î tû gencîne î
Qelem, cawîdan î tu sermaye î

Ji nûra te ye Nûrî ruhnîdil e
Bi camêrî jê ra tu bişteğile

Di çend qisman de jî nexasim di qismê “çewabûna wehyê û pêwendîyên pê ve”, “xwarin û vexwarina pêxember” û “wefata pêxember” da gazî felekê dike.

Di El-Cewahîrê de banga li qelemê hindik e. Tenê qismên “sebebê nezma kitêbê”, “mî’raca pêxember” û “fetha Mekkeyê” bi banga li qelemê dest pê dikin. Nexasim qismê sebeba nezmandinê, sohbeta bi qelemê re zêde dihewîne. Di qismê “wefata pêxember” a vê berhemê de jî bangî felekê dike. Çend beytên serê qismê “sebebê nezma kitêbê” weha ne:

Qelem furset ji meydanê hilîne
Di meydana te betlek xasî nîne

Li hev bade tu têlê her zemanan
Xeber de tu bi her new’ê zimanan

**Encam**

Mela Mûhemmed Nurûllahê Godişkî, ji hêla Bedlîsê xwedî ‘ilm û helbestvanekî navdar e. Li medreseyê perwerde bûye. Ehlê terîqetê ye. Şi’rên wî di sinifê klasîkê de cî digrin. Di sedsala bîstî de aşiq û evîndarekî pêxember e. Muhîbê mala şêx e û ji maleke şêx e. Di ‘ilm û zanîna Îslamî de nexasim di warê ‘eqîdeyê, sîyerê, fiqhê de jêhatî ye. Di îstî’malkirina zimanê erebî, kurdî û farisî de hoste ye. Hem jî mîna fîlologekî di warê zimên de jîr e.

Heyata pêxember, şemaîla cenabê pêxember û mîraca pêxember di mesnewîyên wî de cî digrin. Guhnedaye qedexeya li ser zimanê kurdî û bi kurdî eserên giranbiha nivîsandine. Di bin bandora şairên berî xwe yên klasîk de maye. Di rêka wan de meşîyaye. Di warê sîyer û şemaîlê de valahîyek dîtîye, ji lew dest bi nivîsandinê kirîye. Bi kurdî nezmandîye, lewra fêm kirîye dema heyata pêxember bi kurdî tê gotin, xelqê me zêde guh didê û diecibîne. Îfade dike di vê sehayê de berhemên bi kurdî kêm in. Dil kirîye ku pê bighê rizaa Xwedê û hezkirina pêxember, li pey xwe tiştekî bi xêr bihêle.

Berhemên wî El-Cewahîrur Reşadîye û El-Hemaîlû Fîş Şemaîlî, du mesnewîyên dînî yên bi hecm in, bi qalibê arûzê hatine hûnandin. El-Cewahîr 5024 beyt in û nivîsandina wê di 1967ê mîladî da temam bûye. El-Hemaîl jî 5569 beyt in û nivîsandina wê di 1983ê mîladî da qedîyaye. Mijara herduyan sîyer û şemaîl e. Sîyera wan kronolojîk e. Dewra Mekkeyê bi kurtasî hatîye nezmandin. Di El-Cewahîrê da sîyer zêde cî digre. Nexasim, mî’rac û ğezwe û serîye û behsa heyetan û mektûbên wî gelek berfireh in. Di dawîyê da jî pendnameyek heye ku di berhema din da tune ye. Di El-Hemaîlê da jî şemaîl zêde berfireh e. Rabûn û rûniştina pêxember, neseb û malîyên wî, hal û tevger û mu’cîzên wî, meth û navên pêxember, wefata wî dirêjtir in. Heman mijar, bi awayekî din û îfadeyên cûdatir hatine hûnandin. Di mesele û mijarên girîng da, bangî qelemê kiriye. Pê re suhbet kirîye. Di hinek mijaran da jî gazî felekê kirîye. Li gor mijarê hest û heyecana xwe xweş nîşan daye.

Di herdu berheman da jî kurdîya serdest, a hêla Bedlîs û Serhed û Sêrtê ye. Lê haya wî ji devokên din jî heye. Peyvên herêmî, peyvên klasîkan yên kevn, peyvên erebî, farisî û tirkî bi kar anîne. Bi haşîyeyan peyvên ku nayên zanîn, wateyên wan

dîyar kirine. Di kurdî da hin peyvên ku zêde nayên bikaranîn an jî nexuyanî ne, di nezmên xwe da xweşik bi cî kirine. Bi vî awayî ew peyv parastine.

Herdu berhem di warê xwe da neqane ne. Her çiqas mijarên wan cuda hatibin hûnandin jî, hevudû temam dikin. Di edebîyata me da tim biriqandî ne. Nexasim di sedsala bîstî da ji bo edebîyata me ya klasîk şaheser in. Valahîyeke mezin dagirtine. Hostatîya Mela Nurûllah nîşan didin. Bi zimanê klasîk û yê nû, bi belağeteke xweşik eşq û evîna pêxember civandine. Ji lew qedr û qîmeteke mezin dihewînin. Ji bo edebîyat û ziman, dewlemendîyeke mezin in.

**Çavkanî / Kaynakça /References**

Adak, A. Rahman, *Teşeyên Nezmê*, Nûbihar, Stenbol 2019.

Bakirhan, Cihat, *Godîşkî'nin Çenta Yetîman Adlı Eserinin Transkripsiyonu, Çevirisi, Tahlil Ve Tenkidi*, Teza Lîsansa Bilind, Zanîngeha Alparslanê, Mûş 2017.

Farqînî, Zana, *Ferhenga Kurdî-Tirkî*, Enstîtuya Kurdî Ya Stenbolê, Çapa Çarem, İstanbul 2013.

Kızıl, Hayreddîn *"Di"Ya Kırpandınê/Tekîdê Di Kurmancî De"* Kovara Enstîtuya Zimanên Jîndar a Zanîngeha Bingolê, c. 5, hej. 10, 2019.

Sağnıç, Feqî Huseyn, *Dîroka Wêjeya Kurdî*, Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2002.

Titiz, Fahri, *El-Cewahîru'r Reşadîye Fî Sîretî'n-Nebewîye Ya Mela Nurûllahê Godışkî (Metn Û Lêkolîn Û Ferheng)*, Teza Masterê, Zanîngeha Bîngolê, Bingol 2020.

Werqanisî, Şêx Fet'hûllah, *Elhemaîlû Fîşemaîlî*, Amadekar Zeynelabidîn Zinar, Doz, Çapa Yekê, Stenbol 2007.

**PÊVEK**

## I. Belgeya ku El-Hemaîlî Fîş Şemaîlî aydîyê Mela Nurûllah e.



**"ELHEMAİL FİŞŞEMAİL" adlı eserin Nurullah Özdemir (Godişki)'e ait olduğuna dair Şeyh Fethullah Verkanısî hazretlerinin ailesinin mektubu:**

Biz Şeyh Fethullah Verkanısî (ks) Hz. torunlarından ve Oxin medresesinin müderrislerinden Fethullah AYTE ve Mesut TÜREL, kendisinin ilmi varisleri ve geride bıraktığı ilmi eserlerin sahipleri olan ailesi adına beyan ediyoruz ki dedemiz Şeyh Fethullah Verkanısî (ks) hazretlerine ait "ŞEMAİL" adında ya da Şemail konusunda ne nesir ne de nazım olarak bir eseri yoktur. "EL HEMAİLU FİŞŞEMAİL " adlı eser her şeyiyle Oxin medresesinin yetiştirdiği âlimlerden biri olan Mella Nurullah Özdemir (Godişki) 'e ait bir eser olup dedemiz Şeyh Fethullah adına sehven neşredilmiştir. Âlimin ve ilminin hakkını vermek açısından bu gerçeği bir daha ilgilenenlere Şeyh Fethullah Verkanısî (ks)hazretlerinin ailesi olarak teyid ediyoruz.

**Nameya malbata Şêx Fethullahê Werqanisî di derheq berhema "EL HEMAİL FİŞŞEMAİL" ko ya Mella Nurullah Özdemir (Godîşkî)'e.**

Em ji malbata Şêx Fethullahê Werqanisî (ks) û muderrisên medreseya Oxînê, nevîyên wî Fethullah AYTE û Mesut TÜREL. Em wek warisên Şêx Fethullah(ks) yên ilmî û xwedîyên berhemên wî yên ilmî ko paşva hiştîye, bi navê malbata Şêx Fethullah (ks)daxuyan dikin ko di nav berhemên kalikê me Şêx Fethullah (ks) de berhemek bi navê " ŞEMAİL" an ji tu berhem derheq Şemailê de ne bi nezm, ne jî bi nesr tuneye. Berhama bi navê "EL HEMAİLU FİŞŞEMAİL" ya yek ji wan alimên ko medreseya Oxîn xwedîkirîye Mella Nurullah ÖZDEMİR (Godîşkî)'e. Ev berhem bi şaşî li ser navê kalikê me Şêx Fethullah (ks) hatîye weşandin. Ji bo dayîna mafê âlim û ilmê wî em, malbata Şêx Fethullah evî rastîyê ji bo kesên ko di vî derheqê de têkildarin teyît dikin.

رسالة فى أن الكتاب المسمى ب"الحمائل فى الشمائل" لملا نور الله اوزدمر (الگوديشكى)

نحن من أحفاد الشيخ فتح الله الورقانسى (ق س) و من مدرسى المدرسة الفتحية العلائيةالأوخينية فتح الله آيته و مسعود ترل نبين بإسم ورثة الشيخ فتح الله (ق س) العلمية و أصحاب كتبه التى أورثناها منه : بأنه ليس لجدنا الشيخ فتح الله (ق س) كتابا مسمى ب "الشمائل" ولا كتابا فى موضع الشمائل لا نظما ولا نسرا نظمه الآخرون. والكتاب المسمى ب " الحماءل فى الشمائل " الذى طبع بإسم جدنا الشيخ فتح الله (ق س) سهوا كله ل"الملا نورالله أوزدمر الگوديشكى " من العلماء الذين تخرجوا من المدرسة الفتحية العلائية الأوخيفية

نؤيد هذه الحقيقة مرة أخرى لمن يهتم بالأمر أداء لحق العالم وعلمه

فتح الله آيته
**Fethullah AYTE**

مسعود ترل
**Mesut TÜREL**

## II. Destxeta Mela Nurûllah a di rûpela El-Cewahîrê de



## III. Ji Hemaîlê serê qismê dawîn



# Nostaljî Di Romana Kurdî Ya Swêdê De*

Mehmet Salih KARAASLAN*

**Kurte**

Edebiyata Kurdî ya ku di navbera salên 1980-2000'an de li Swêdê hatiye afirandin, weke qonaxeke berbiçav di dîroka Edebiyata Kurdî de cî girtiye. Du faktorên sereke bûne sedem ku ev edebiyat derketiye holê. Yek, kesên ku ev edebiyat afirandine, li welêt di nav kar û xebatên siyasî de bûn, piştî ku rêxistinên wan bi darbeya leşkerî ya 1980'yî li Tirkiyê çêbû, hilweşiyan, ji mecbûrî çûn Swêdê û enerjî û motîvasona xwe dan kar û xebatên edebiyatê. Faktora duduyan, dewleta Swêdê ye ku çand û zimanê biyaniyên nav xwe weke dewlemendî didîtin, ew diparast û bi pêş ve dixistin, ku Ziman û Edebiyata Kurdî jî yek ji wan bû.

Nostaljiya ku îro weke bêrîkirina bêrîkirina welêt û demên berê tê zanîn, bi awayekî berbiçav di romana vê edebiyatê de heye. Sedemên vê yekê ew e ku nivîskar, gelek salan ji ber pirsgirêkên siyasî nikarîbûn bihatana welêt, loma bêriya malê, welêt, civak, dost, heval û demên xwe yên berê dikirin. Loma wan welat birin ser maseya xwe, di nav pelên romanan de bi cî kirin û jiyana xwe ya berê dîsa dîsa di nav rûpelên edebiyatê de jiyan. Bi vî awayî romanên Kurdî yên ku li Swêdê hatine nivîsîn, bîranîn û serboriyên welêt in.

**Gotinên Sereke**: Edebiyata Kurdi ya Swêdê, romana Kurdî, nostaljî, Mahmûd Baksî, Sidqî Hirorî

---

* Ev gotardi sempozyuma bi navê "Dicle Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Lisansüstü Öğrenci Sempozyumu 7-9 Kasım 2023"ê da hatîye pêşkêşkirin.
*Xwendekarê Doktorayê li Zanîngeha Dîcleyê. salihagirqoseri@hotmail.com, orcid: 0000-0002-7687-9360

## İsveç Kürtçe Edebiyatında Nostalji

**Özet**:

1980 ile 2000 yılları arasında İsveç'te ortaya çıkan Kürt Edebiyatı, Kürt edebiyat tarihinde bir dönüm noktası olarak yer almıştır. Bu edebiyatın ortaya çıkmasına iki temel faktör rol açmıştır. Birincisi, bu edebiyatı oluşturan kişiler ülkede siyasi çalışma ve faaliyetlerde bulunmuşlar, 1980'de Tûrkîye'de yapılan askeri darbeyle örgütleri dağıldıktan sonra mecburen yurtdışına çıkmış, İsveç'e yerşmişlerdir. Böylece Kürtlüğe olan enerji ve motivasyonlarını dil ve edebi faaliyetlere vermişler. İkinci faktör ise İsveç hükümetinin yabancıların kültür ve dilini zenginlik olarak görmesi ve bunu koruyup geliştirmesidir ki, Kürt dili ve edebiyatı da bunlardan birdir.

Bu edebiyatın romanında günümüzde memleket, ev ve geçmiş zamanlara olan özlem olarak değerlendirilen nostaljî, belirgin bir şekilde kendisini göstermektedir. Bunun nedenleri ise yazarların siyasi sorunlar nedeniyle uzun yıllar ülkeye gelememesi, dolayısıyla evini, ülkesini, toplumunu, arkadaşlarını, ve eski zamanlarını özlemesidir. Böylece gidemedikleri ülkeyi arkadaşlarını, siyasi faaliyetlerini vb geçmişlerini masalarına taşımış, edebiyat sayfalarında geçmişi tekrar yaşamışlardır. Bu yönüyle İsveç'te yazılan Kürt romanları yazarların anılarından ve özgeçmişlerinden oluşmaktadır denilebilir.

**Anahtar Sözcükler**: İsveç Kürt Edebiyatı, Kürtçe roman, nostalji, Mahmud Baksî, Sidqî Hirorî

## Nostalgia In Swedish Kurdish Literature

**Abstract**

Kurdish Literature that emerged in Sweden between 1980 and 2000 has marked a turning point in the history of Kurdish literature. Two main factors played a role in the emergence of this literature. Firstly, the people who created this literature were involved in political work and activities in the country, and after their organizations were disbanded following the 1980 military coup in Turkey, they were forced to leave the country and settled in Sweden. Thus, they directed their energy and motivation for Kurdish identity towards language and literary activities. The second factor is the Swedish government's view of foreigners' culture and language as richness and its protection and development of these, of which Kurdish language and literature is one.

Nostalgia, which is now considered as longing for homeland, home, and past times, is prominently featured in the novels of this literature. The reasons for this are that the writers could not come to the country for many years due to political issues, thus missing their homes, country, society, friends, and old times. Therefore, they brought the country they couldn't visit, their friends, political activities, etc, their past to their desks, reliving the past in the pages of literature. In this respect, it can be said that Kurdish novels written in Sweden consist of the authors' memories and autobiographies.

**Keywords:** Swedish Kurdish Literature, Kurdish novel, nostalgia, Mahmud Baksi, Sidqi Hirori

## Destpêk

Çawa ku di demên Osmanî yên dawî de li Stenbolê, di salên 1930'î de li Şamê Celadet Elî Bedirxan û hevalên xwe, dîsa di heman salan de li Qafqasya Erebê Şemo û yên din di dîroka Edebiyata Kurdî de qonaxên girîng in, Edebiyata Kurdî ya ku piştî salên 1980'yî li Swêdê hat afirandin jî, bi heman awayî qonaxeke girîng e.

Di afirandina vê edebiyatê de du faktoran rolê sereke lîstine. Yek jê Kurdên ku çûne Swêdê bi xwe ne û ya din dewleta Swêdê ye. Kurdên ku berî 1980'yî li Kurdistanê, di nav kar û xebatên siyasî de çalak bûn, dema darbeya leşkerî ya 12 Îlona 1980'yî li Tirkiyê çêbû, ji welêt derketin, gelek ji wan weke pênaberên siyasî çûn li Swêdê bi cî bûn (Fondation-Institut Kurde de Paris: 21.01.2023). Dema rêxistinên wan belav bûn, êdî tu xebatên siyasî neman, van Kurdan dest bi xebatên Ziman û Edebiyata Kurdî kirin. Di heman demê şertên Dewleta Swêdê ji bo vê yekê guncav bûn. Hikûmetên Swêdê ziman û çanda biyaniyan weke dewlemendî dipejirandin û ji bo parastin û bipêşvexistina wan bi taybetî qanûn derxistin (Pettersson, 2013: 13). Kurdan jî ji vê derfetê îstifade kirin, dest bi kar û xebata Edebiyata Kurdî kirin û bi vî awayî qonaxa Edebiyata Kurdî ya Swêdê derket holê.

Bi dehan nivîskaran li Swêdê bi sedan berhemên edebî weşandine. Di nav van berheman de roman, çîrok, helbest, lêkolîn, rexneyên edebî, berhemên pêkenînê, afirandinên şano,

bi kurtayî her cureyên edebiyatê berhem hatine nivîsîn (Alakom, 1991: 19). Di navbera salên 1980 û 2000'an de li Swêdê gelek rojname, kovar û bi sedan pirtûkên Kurdî hatine weşandin (Alakom,2021: 128). Di navbera salên 1980-2000'an de, her sal di navbera 40 û 50 pirtûkî de bi zaravayê Kurmancî tên çapkirin (Brunessen, 200, 13).

Romana Kurdî ya ku li Swêdê hatiye nivîsîn, bîranîn û serboriyên nivîskaran in, leheng nivîskar bixwe ne, mekan welat e, dem, dema wan a welêt a salên 1970'yî ye û bûyer serboriyên wan bixwe ne. Loma di naveroka vê romanê de nostaljî bi awayekî berbiçav heye. Nostaljiya ku îro di wateya bêrîkirina welêt, mal û demên berê de tê bikar anîn, cara yekem di 1688'an de li Îswîçre doktorekî Polonî bi navê Johannes Hofer bikar aniye û ji wê rojê de weke têgeh di termînolojiyê de bi cî bûye (Routledge, 2016: 4).

Sedema nostaljiyê ew e ku ev nivîskar gelek salan, ji ber dozên xwe yên siyasî nikarîbûm bihatana welêt, loma welat anîn ser maseya xwe û di nav rûpelên romanê de bi cî kirin, jiyana xwe ya welêt dîsa ava kirin û dîsa jiyan.

### 1. Kurd û Swêd

Cara yekem Kurdekî bi navê Mîrza Seîd dema li Senendecê dersa Farisî dide, dilê wî dikeve qîza keşeyekî Suryanî û dînê xwe diguhere û dibe Xiristiyan, piştre mîsyonerên Swêdî nas dike û di 9'ê Pûşbera 1893'an de li gel wan dihere Swêdê. (Carlsson&Egfors, 1983: 8). Kurdê duyem Şerîf Paşa ye ku weke sefîrê Osmaniyan di 1898'an de çûye Swêdê û heta 1909'an li Stockholmê maye (Demir, 2013: 48). Mehmen Emîn Zekî Beg jî 1914'yan de bi wesîleyekê li Tîflîsê ye, dema Şerê Cîhanê yê Yekem derdikeve, nema dikare vegere. Loma ji wir dihere Swêdê û çend mehan li Stockolmê dimîne (Alakom, 200: 184). Leyla Bedirxan, balerîneke ji malbata Bedirxaniyan e, di 1925'an de çûye Stockholmê, reqsên xwe pêşkêş kiriye (Malmisanij, 2009: 209). Piştre zarokekî bi navê Silêman, di şerê Cîhanê yê Yekem de bi malbata xwe re direvin, diherin Qafqasyayê, malbat li wir belav dide, piştre ew bi tena serê xwe ji Serhedê dihere Gurcîstanê, ji wir bi kesekî Alman re dihere Ûqrayna, li wir li gundekî Swêdiyan, malbateke Swêdî wî adopte dike, navê wî dikin Alexander û jib er ku paşnavê malbatê jî Knutas e, navê

**Çimeyî / Çavkanî /References**

Aldatmaz, A. N. (2013). *Sanikanê Mamekîye ra*. Mêrdîn: Weşanê Enstîtuyê Ziwananê ke Tirkîya de Ciwîyenê yê Unîversîteya Artuklu ya Mêrdînî.

Bozkoyun, M. (2015). Beşek Ji Folklora Kurdî: Çîrok. *Bingöl Üniversitesi Yaşayan Diller Enstitüsü Dergisi Yıl:1, Cilt1, Sayı2,*, 142-157.

Çîçek, A. A. (2012). *Sayê Marû, Estanikanê Xinis û Tekmanî ra*. Îstanbul: Weşanxaneyê Vateyî.

Demir, R. (2022). V. Propp'un Yapısalcı Kuramı Bağlamında Bir Masal Çözümlemesi: "Felaket Şimdi Mi Gelsin Sonra Mı?". *Asobid - Amasya Üniversitesi Sosyal Bilimler Dergisi Sayı: 12*, 205-224.

Efe, G. A. (2017). Vladimir Propp Yöntemine Göre Bir Masal İncelemesi Örneği. *The Journal of Academic Social Science Yıl: 5, Sayı: 45*, 558-568.

Günay, U. (1975). *Elazığ Masalları (Doktora Tezi)*. Erzurum: Atatürk Üniversitesi Basımevi.

Güneş, D. D. (2019). Yeraltı Diyarının Kartalı Adlı Masalın Vladimir Propp'un Biçimbilimsel Yaklaşımı Çerçevesinde Çözümlenmesi. *Erciyes İletişim Dergisi Cilt: 6 Sayı: 1*, 513-526.

Karahanlı, E. (2022). Sêwregi ra Nimûneyê Estanikan. *Projeya Lîsansê Bêtezî*. Mêrdîn: Unîversîteya Artukluyî.

Lezgîn, R. (2012). Elik û Fatike. P. D. Yildirim, I. Bingol, & R. Lezgîn içinde, *Edebîyatê Kirmanckî ra Nimûneyî* (s. 83-87). Mêrdîn: Weşanê Enstîtuya Ziwananê ke Tirkîya de Ciwîyenê ya Universîteya Artuklu ya Mêrdînî.

Özer, V. (2022). Vladimir Propp'un Masal Çözümleme Metodu Bağlamında "Sarı Öküz" Masalı Üzerine Bir İnceleme. *Karamanoğlu Mehmetbey Üniversitesi Edebiyat Fakültesi Dergisi 5 (2)*, 251-266.

Propp, V. (1998). *Folklor / Teori ve Tarih*. İstanbul: Avesta.

Propp, V. (2001). *Masalın Biçimbilimi -Olağanüstü Masalların Yapısı-*. istanbul: Om Yayınevi.

Yakışan, B. (2018). Estanikanê Zazakî di Motîfê Lu. *Bingöl Üniversitesi Yaşayan Diller Enstitüsü Dergisi Yıl:4, Cilt:4, Sayı:7*, 99-111.

Yaman, S. (2014). Propp Metodunun Bir Uygulaması - Tokat Yöresine Ait Yumakoğlan Masalı. *Sosyal Bilimler Araştırmaları Dergisi. II*, 147-155.

# Rabêja Dijmêtingeriyê di Romana Helîm Yûsivî ya *Sobarto*yê da

Murat İŞÇİ*


## Kurte

Di vê gotarê da ez ê li ser romana Helîm Yûsivî ya bi navê *Sobartoyê* bixebitim. Wekî tê zanîn Helîm Yûsiv yek ji nivîskarên kurdên Sûrîyeyê ye. Ew jî wekî piranî nivîskarên kurd, bêgav maye û derketîye derveyî welatî. Em ê jî di romana wî ya ewil da bikevin pey şopa rabêja dijmêtingerîyê û em ê li bersivên van pirsan bigerin. Gelo mêtingerîyê di romana wî da çawa reng vedaye? Gelo di romanê da kirdeyên mêtinger û mêtinkirî bi çi awayî rastî hev hatine? Gelo li hemberî şîdeta mêtingerîyê roman dikare bibe enîyeka berxwedanê? Em ê bi saya van pirsan bigihîjin bersiva vê pirsê, gelo di romana *Sobartoyê* da rabêjeka dijmêtingerîyê heye yan tune ye?


**Peyvên Sereke:** Mêtingerî, Dijmêtingerî, Kurd, Sûrîye, Roman.

## Helîm Yusiv'in *Sobarto* Romanında Antikolonyal Söylem


## Özet

Bu makalede Helîm Yûsiv'ın *Sobarto* adlı romanı üzerinde çalışacağım. Bilindiği üzere Helîm Yûsiv Suriye Kürt'lerindendir. O da diğer Kürt yazarlar gibi mecburi olarak ülkesini terk ederek yurtdışına çıkmıştır. Biz de bu ilk romanında antikolonyal söylemin izini süreceğiz ve bu soruların cevabını arayacağız. Acaba kolonyalizm romanına nasıl yansımış? Acaba kolonyalist ve kolonyal özne hangi şekilde karşılaşmıştır? Acaba kolonyalistin şiddetine karşı roman bir direniş cephesi olabilir mi? Bu soruların sayesinde *Sobarto* romanında antikolonyal bir söylem var mı ya da yok munun cevabına ulaşacağız.


* Xwendekarê Doktorayê yê Zanîngeha Dîcleyê. muratisci1985@gmail.com, Orcid: 0000-0003-4405-9023

**Anahtar Sözcükler:** Kolonyalizm, Antikolonyalizm, Kürtler, Suriye, Roman,

## Anticolonial Discourse in Helîm Yusiv's Novel *Sobarto*

**Abstract**

In this article, I will study on Helîm Yûsiv's novel *Sobarto*. As is known, Helîm Yûsiv is from the Syrian Kurds. Like other Kurdish writers, he was forced to leave his country and go abroad. In this first novel, we will trace the anticolonial discourse and seek answers to these questions. How is colonialism reflected in the novel? How do the colonizer and the colonized subject encounter each other? Can the novel be a front of resistance against the violence of the colonizer? With these questions, we will find out whether there is an anticolonial discourse in the novel *Sobarto* or not.

**Keywords:** Colonialism, Anticolonialism, Kurds, Syria, Novel

## Destpêk

Serdest ango mêtinger desthilatdarîya xwe ewil bi awayekî fizikî û leşkerî saz dikin. Paşê dixwazin hiş û gîyanê gelê mêtinkirî li gor berjewendîyên xwe ji nû ve biafirînin. Di vê pêvajoya afirandinê da wêje amûreka pir giring e. Helbet ne tenê wêje, huner û zanist jî amûrên giring in. Ew qadên ku bi salan objektîf hatibûn dîtin, bi saya teorîdanerên dijmêtinger, rûyê wan ê rastîn hat teşhîrkirin. Teorîyên nû, em pê hesandin ku wêje jî ji bo mêtingeran enîyeka xurt e. Romana Daniel Defoeyî ya bi navê *Robînson Crusoe*yê ji bo vê mijarê mînakeka balkêş e. Wekî tê zanîn serlehengê romanê Robînson li giravê rastî reşikekî tê. Tavilê navekî lê dike û wî ji xwe ra dike xulam. Em dikarin vê romanê bi du awayan bixwînin. Xwendinekê di ser ra bikin û jê zewqeka wêjeyî bigirin. Yan jî bi guman nêzîkê wê bibin û van pirsan bikin. Robînsonî çima têkilîyeka wekhev bi Înî (Friday) ra dananî? Çima navekî nû lê kir, gelo navekî wî tune bû? Çima bi şîdet nêzî wî bû û ev ji xwe ra heq dît. Em dikarin pirsan zêde bikin. Dema Robînsonî ev berhema xwe nivîsî, belkî ku nîyeteka wî ya xirab tune bû. Lê nikaribû xwe ji fikren mêtinger ên serdema xwe rizgar bike. Edward Saîd jî di berhema xwe ya

Oryantalîzmê da qala Rojava çawa Rojhilatê dimijîne û di vê pêvajoyê da jî çawa ji wêje, zanist, akademî, sînema, geştnameyan gerokan hwd sûd werdigire, dike. Nivîskar dema berhema xwe dinivîsin dibe ku armanc û nîyeteka wan ya weha tune be, lê mixabin carna nikarin xwe ji rabêja (discourse) heyî rizgar bikin. Ji ber vî tiştî divê kesên mêtinkirî (colonized) bi guman nêzî berhemên ji alîyê mêtingerên (colonist) wan ve tên nivîsîn bibin. Bi ser da ew jî dikare bi rêya berhemên xwe rabêja mêtingerîyê xurt bike û ji nû ve hilberîne. Helbet ne pêkan e ku cihê êriş lê hebe berxwedan jî tune be. Em ê şopên vê berxwedanê jî di romana *Sobarto*ya Helîm Yûsivî da bigerin.

Xebata me ji ber ku teorîk e, em ê serî li şirove, analîz û berhemên ku bi xebata me ra têkildar in, bidin. Xebata me dê ji du beşan pêk bê. Dê navê beşa ewil 'Mêtingerî û Dijmêtingerî' be û di vê beşê da em ê bingeha xwe ya teorîk saz bikin. Ev beş jî dê ji çar binbeşan pêk bê. Sernava binbeşa ewil dê 'Mêtingerî' be. Em ê di vê beşê da mêtingerîyê pênase bikin û li ser sepandinên wê bisekinin. Bi alîkarîya dîrok û teorîyên mêtingerîyê, em ê hewl bidin bersiva, "Ka axa kurdên Sûrîyeyê mêtingeh e yan na?" bibînin. Sernavê binbeşa didûyan 'Rabêja Mêtingerîyê' ye. Em ê hewl bidin ka mêtinger bi kîjan amrazan rabêjekê diafirînin û erêdanîya mêtinkirîyan qezenc dikin. Sernavê binbeşa sisêyan jî 'Rabêja Dijmêtingerîyê' ye. Di vê beşê da me bal kişand ser hemû temas yan jî rasthatinên mêtingerîyê ka çawa dualî ne. Alîyek zilm be alîyek din jî berxwedan e. Çawa bi rêya deqan rabêjeka mêtinger tê sazkirin, di heman wextî da dîsa bi rêya deqan rabêjek dijmêtinger jî serî hildide. Di beşa diduyan da jî me bi alîkarîya beşa ewil romana Helîm Yûsivî ya *Sobarto*yê di peywenda rabêja dijmêtingerîyê da dahûrand.

## Beşa 1: Mêtingerî û Dijmêtingerî

### 1.1.Mêtingerî

Dîroka mêtingerîyê bi qasî dîroka mirovahîyê kevn e. Kes, kom û dewletên xurt hikum li yên qels kirine. Dewlemendîyên wan li gor berjewendîyên xwe bi kar anîne; lêbelê ev mêtin ne tenê bi awayê madî, di heman wextî da bi pêvajoya bişaftina çand,

bawerî û nirxên vî gelê mêtinkirî meşîyaye. Ne hewce ye ku em bibêjin ev pêvajo bi kirinên hov û zalimane çêbûne. Bixwe dîroka mirovahîyê bi van kirinên kirêt ên mêtingeran tijî ye. “Di sedasala 2yan ya piştî zayîna Îsayî da Roma di serdema xwe ya herî xurt da bû û wê erdê xwe ji Ermenistanê heta Atlantîkê fireh kiribû. Moxolîyan di sedsala 13an da bi rêberîya Cengîz Xanî, Rojhilata Navîn û Çîn fetih kiribû. Împaratorîya Aztekî di sedsalên navbera 14 û 16an da, li gelîyê Mexicoyê bi saya bindestkirina komên etnîkî ya ji alîyê komeka etnîkî ve ava bûbû. Dewleta herî mezin a berîya pîşesazîyê li Amerîkayê Împaratorîya Aztekîyan bû û wekî aztekîyan, înkayîyan jî ji gerîna xizmet û malan xerac distendin. Di sedsala 15an da hin şahîtîyên başûrê Hindistanê ketibûn bin nîrê Împaratorîya Vîjaynagarayê. Împaratorîya Osmanî di rojavayê Tirkîyeya îroyîn da mîrîtîyeka biçûk a îslamî bû û Asyaya Biçûk û parçeyeka mezin a Balkanan tevlî nav axa xwe kiribû.” (Loomba, 2000, r. 19-20) Hemû mirov di serdemeka dîrokê da hatine koçkirin, dagirkirin an jî tunekirin. Mêtingerî di her sedsal û erdnîgarîyê da rengekî nû girtîye, lê tiştê neguherîye mêtina çavkanîyên gelî yan jî komên mêtinkirî ne. Di serî da em li ser wateya kolonyal û mêtingerîyê û paşê li ser pênaseyên wê hûr bibin. “Li gor *Oxford English Dictionary* (OED) peyva mêtingerîyê tê wateya ‘wargeh’ û ‘çewlik’ê. Romayî li ser axeka din bi cih bibûna jî wekî hemwelatîyên Romayê dihatin hesibandin û di vê peywendê da bi Romayê ra têkildar peyva latînî ya “colonia” dihat bikaranîn. Li gor vîya OED mêtingerîyê wiha pênase dike:

Wargeheka nû li welatekî din... Komeka mirovan ya bi welatê xwe ra girêdayî yan jî têkilîya xwe pê ra diparêze; nifş û peyrewên ewil li wir bi cih bûne ger têkilîya xwe bi welatê xwe ra biparêzin ji vê wargehê ra ‘colonia’ tê gotin.” (h.b. r. 18-19)

Wekî Loomba jî îfade dike helbet li ser vê pênaseyê bivênevê ev pirs tên hişê mirovî. Gelo berîya ew kesên çûne wir ji xwe ra kolonî ava kirine li şûna wan kes hebûne yan tune bûne? Hîn zelaltir em bibêjin, ew der berîya bibe kolonî ne war û welatê hin kesan e? Em dizanin nêrîna navend ewropayî vê rastîyê piştguh dike û ji bo vî tiştî hincetên wî jî hene. Hinceta mezin jî sûcdarî û faîlbûn e. Lêbelê bersiva vê pirsê ji çavê kesê mêtinkirî zelal e. Albert Memmî jî balê dikişîne ser vê mijarê. “Ne pêkan e

ku mêtinger ji vê rewşa xwe ya bêdad ne haydar be. Bi tesadufeka dîrokî mêtinger tê ser axekê û wê derê bi darê zorê dagir dike û zagonên xwe bi cih dike. Bi van kirinên xwe mêtinger pir aşkera xesbker e û ew jî ji vê rewşa xwe haydar e." (Memmî, 2014, r. 30) Franz Fanon bi awayekî manîheîst nêzî meseleya mêtingerîyê dibe. Li gor wî cîhana mêtingêrîyê bi her awayî du parçeyên dijberî hev in. Li alîyekî bajarê mêtinger lê dijî heye. Ev bajar paqij, dirust, ronak û birêkûpêk e. Li alîyê din bajarê mêtinkirî lê dijî heye. Ev bajar jî qirêj, tevlihev, tarî û kaotîk e. Mêtinger spî, mêtinkirî reş in. Mêtinger rêveber, mêtinkirî xulam in. Dijayetîyên mêtinger û mêtinkirîyan zêde ne û ev jî ji rewşa mêtingerîyê diwelidînin. (Fanon, 2013, r. 43-47) Mamostayê dibistana navîn a Fanonî, helbestkar û yek ji teorîdanerê dijmêtingerîyê Aimé Césaireyî jî serê xwe bi vê meseleyê êşandîye. Ramanên wî di derbarê mêtingerîyê da kêm û zêde wekî yên Fanonî ne û di serî da balê dikişîne ku angaştên mêtingeran pûç û nerast in. "Li gor wî, mêtingerî çi hînbûna *Încîl*ê ye çi teşebiseka xêrxwaz e, çi jî bipaşvexistina nezanî, nexweşî û despotîzmê ye çi jî projeya bilindkirina navê Xwedê ye çi jî bipêşvexistina pergala dadî ye." (Césaire, 2005, r. 66-77) Yek jê avakarê bizava negrîtudeyê Aime Césaire paşê pênaseya mêtingerîyê weha dike. "Ez qala civakên ava wan a cewherî ji wan hatîye kişandin û xercandin, çanda wan hatîye binpêkirin, damûdezgehên wan hatine hilweşandin, axa wan hatîye dagirkirin, dînê wan hatîye belewelakirin, berhemên wan ên hunerî yên ezamet hatine tunekirin, dikim" (h.b. r. 78) Loomba jî mêtingerîyê wekî dagirkirin û kontrolkirina welatî û malên mirovên din û destwerdana pergala sîyasî û çandî ya welatekî pênase dike. (Loomba, 2000, r. 19)

Herçend dîroka mêtingerîyê bi qasî dîroka mirovahîyê kevn jî be dema wê ya herî hov bi kapîtalîzmê dest pê dike. Ewropayê bi kolonîzekirina Amerîkayê û deverên din sermayeya xwe xurt kir û kapîtalîzm bi pêş da çû. "Dîrokzan piranî li Ewropayê û bi taybetî jî li Îngilîstanê feraseta mêtingerîyê dikin sê beşên serdemên dîrokî. Serdema Yekem, ji dawîya sedsala 17an heta serê sedsala 19an didome û wekî *Kevn an jî Mêtingerîya Împeryal* (Old or Colonial Imperialism) tê binavkirin. Di serî da merkantilîzm û parzemîna Amerîkayê û pê

ra têkildar jî pêvajoya mêtingehkirina Dinyaya Nû vê serdemê herî baş karakterîze dike. Serdema Duyem ji salên 1830an heta salên 1880î didome û wekî *Mêtingerîya Serbest a Bazirganîyê* (Laissez faire) tê binavkirin. Dewletên wekî Osmanî, Çîn û Îran ên ku paşdemayî ango yên pîşesazîyên xwe ava nekirine, di serî da ji alîyê Îngilîstan û dewletên mêtinger ve, bi rêya aborîyê tên mêtingehkirin. Ev pêvajo vê serdemê bi awayê herî baş karakterîze dike. Serdema sêyem, ji salên 1880î heta salên 1940î didome û wekî *Mêtingerîya Nû* (New Imperialism) tê binavkirin. Piştî mêtîngehkirina aborîyê ya dewletan, kontrolkirina sîyasî û îlhakkirina wan dest pê dike û ev pêvajo vê serdemê herî baş karakterîze dike." (Cains û Hopkins,1993, 5-17, Robînson û Gallager, 1976, 138-140, 143 ji alîyê Yaramiş 2007, r. 121-122 ve hatîye neqilkirin) Êdî serdemeka nû jî dest pê kirîye. Mêtinger hîn jî bi rêya tekilîyên grîft ên çand, aborî û polîtîk hikum li ser welatên serbixwe dikin. Êdî eriş nerasterast e; hê biaqilane ye. Navê vê serdema nû jî neomêtingerî ango mêtingerîya nû ye. "Piştî Şerê Cîhanê yê yekem û duyem bi bizavên serxwebûn û dekolonyalîzmê ra ji alîyê dadî ve rewşeka wiha nemîne jî, piranî otorîte bawer dikin ku li dinyayê mêtingerîyeka xurt heye." (Çıtak, 2014, r. 565) Ew welatên ku xwe ji hêzeka mêtinger rizgar kirine û ketine nav pêvajoya dekolonyalîzmê jî ne pir azad in. Êdî hêzên emperyal hewcedarî bi mêtingerîyeka klasîk nabînin. Mêtingehên kevn, li ser kaxezê û di teorîyê da rizgar bûbin xuya bikin jî di pratîkê da bi têkilîyên aborî û polîtîk ji alîyên hêzên emperyal ve hîn jî tên mêtin. Nivîskarê afrîkayî Ngugi Wa Thiong'o jî ji heman derdî gazinan dike. "Ji bo berevanên welatperwer ên çandên şervan ên gelên Afrîkî, emperyalîzm ne sloganek e. Ew heqîqî ye, bi naverok û şêwaza xwe, bi rêbaz û bandorkirina xwe şênber û eşkere ye. Emperyalîzm hakîmîyeta sermayeya malî ya xurtkirî ye û ji 1884'an vir ve sermayeya monopolîstîk a parazît li ser jîyana gundîyên li quncikê herî dûr ê welatên me bandor kirîye û dike. Ger hûn guman dikin, ka binêrin bê çend welatên Afrikî niha di bin deynê kredîya IMFê de ne -bi qewlê Julius Nyerer, Wezareta Navneteweyî ya Nû a Karên Malî (the new International Ministry of Finance). Kî dide deynê kredîyan? Li welêt her hilberînerê serweta reel, yanê her karker û gundî, di bin deynê kredîyê de ye. Emperyalîzm topyekûn e: Îro ji bo hemû gelên cîhanê encamên wê yên aborî, sîyasî, leşkerî,

çandî û derûnî hene. Wê dikarîbû rê li ber holokostê jî veke.” (Thiong'o, 2018, r. 29)

Hin welat ewil mêtingeh bûn û paşê bi awayekî azad bûn. Lê wan jî berê xwe da kêmarên nav xwe û cih û warê wan. Di dîrokê da û niha jî kîjan netewe an jî ji komên curbicur yek derfetekê bibîne bi amrazên cuda dikeve nav liv û tevgerên mêtingerîyê. Meseleya mêtingerîyê ne bi sedsalek an jî bi hezekê sînordar e. Kîjan hêza xurt bi amrazên cuda gelekî bixe bin desthilatdarîya xwe û çavkanîyên wî gelî ji bo dewlemendîya xwe bi kar bîne, ev mêtingerî ye. “Mêtingerî ne tenê ezmûneka dîrokî ya welatên ewropayî ye li hemberî welatên Asya û Afrîkayê, mêtingerî serederîkirin (muamele) û navê bindestkirin û bêhezkirina gel û welatekî ye ji alîyê hêzeka serdest ve. Ji ber vê jî hebûn û nebûna mêtingerîyê ne bi demeka dîyarkirî ve dikare bê sînorkirin, lê bêhtir bi naverok û şêweyê serederîkirina xwe dikare bê destnîşankirin.” (Ergün, 2014, r. 25)

Wekî tê zanîn bi peymana Sykes-Picotê axa kurdan a ku lê dijîn ji hev hat veqetandin. Li Sûrîyeyê di 14ê Tîrmeha sala 1922an da mandaterîya Fransayê ji alîyê Neteweyên Yekbûyî ve hat qebûlkirin û bi awayekî fermî heta rizgarîya Sûrîyeyê ya sala 1946an dewam kir. Herçiqas kurd piştgirî bidin serxwebûna Sûrîyeyê û bajarên wan bên bombekirin jî rêveberên nû yên Sûrîyeyê bi çavekî dijminane li kurdan nêrî. Bi darbeyeka leşkerî, yekîtîya Misir û Sûrîyeyê xirab bû û navê wê guherî û bû Komara Ereb ya Sûrîyeyê. Bi xwe ji navê wê dîyar dibe ka ev dewlet li ser kîjan bigehan ava bûye. Hemû kesên li Sûrîyeyê dijîn ereb hatin qebûlkirin. Kesên li dijî vê jî dibûn dijmin. Pê ra têkildar jî zext û zor her ku çû li ser kurdan giran bû. Di 23.08.1962an da bi numreya 93yan zagonek hat derxistin û bi vê zagonê biryara di rojekê da li herême Cezîrê serjimartineka nifûsê ya awarte bê çêkirin hat standin. Rêveberîya Sûrîyeyê armanca vê serjimartinê, wekî tespîtkirina kesên piştî di sala 1945an da hatibûn Sûrîyeyê nîşan da. Fehîm Taştekîn îfade dike ku wê çaxê garis û pembûya ku li Cezîreyê dihat çandin di nav tevahîya Sûrîyeyê da wekî rêje ji %80 bû. Bi ser da dîtina petrolê jî qîmeta Cezîrê zêde kiribû. (Taştekin, 2016, r. 52) Di meha çirîya paşîn ya sala 1962an da ev serjimartin pêk hat û 200000 (du sed hezar)

kurd ji mafên welatîbûnê bê par hatin hiştin û bûn ecnebî ango welatîyên bênasname.

Heta sala 1963an darbeyên hêzên cuda pêk hatin û pê ra têkildar zexta li ser kurdan carna sist bû carna jî giran bû. Lê bi darbeya Albay Harîrî ra di 08.03.1963an da partîya Baasê hat ser kar. Edî rojên hîn reş li benda kurdan bûn. Berpirsyarê Şaxa Parastina Sîyasî ya Hesekeyê Mihemed Teleb Hîlalî, kurd wekî ûreka xebîs ya di gewdeya ereban da derketîye qebûl dikir û li gor wî bêyî jêkirin û avêtina vê ûrê tu xelasî tune bû. Mihemed Teleb Hîlal di sala 1963an da, raporek li ser bişaftin û qelskirina kurdan amade kir û ev rapor bi navê ‘Ji Alîyê Neteweyî, Civakî û Sîyasî ve Lêkolînek Derbarê Cezîreyê Da’ ji rayederên dewletê ra hat pêşkêşkirin. 12 xalên vê raporê bi vî awayî ne.

“1. Bila kurd ber bi herêmên hundir ên Sûrîyeyê ve bên sirgûnkirin.

2. Bila kurd ji mafên perwerdeyê bê par bên hiştin.

3. Bila kurdên ji alîyê Tirkîyeyê vê tên xwestin bên îadekirin.

4. Bila ji bo kurdan derfeta karî neyê dayîn.

5. Bila li dijî kurdan propagandayek bê destpêkirin.

6. Bila ûlemayên kurd bên sirgûnkirin û dêvila wan jî ûlemayên ereb bên peywirdarkirin.

7. Bila li dijî kurdan polîtîkaya ‘dabeş bike-bi rê ve bibe’yê bê tetbîqkirin.

8. Bila li ser erdên kurdan, ereb bên bicihkirin.

9. Bila ‘Xeta Erebî ya Bakur’ bibe cihê leşkerî û kurd ji van herêman bên derxistin.

10. Bila ji bo erebên nû tên, çewligên kolektîf bên avakirin.

11. Bila kesên ku erebî nizanin ji mafên hilbijartinê bê par bên hiştin.

12. Kesên ku dixwazin li vir bijîn ji wan kesên ne ereb be bila mafê welatîbûnê neyê dayîn.” (Tejel 2015, r. 130)

Em dikarin tenê bi van 12 xalan pênaseya mêtingerîyê bikin. Lê pratîkên li Sûrîyeyê didin xuyakirin ku kirinên hov û zalimane tenê ji van 12 xalan pêk nehatine. Erdên kurdan hatine dagirkirin, çavkanîyên wan hatine mêtin, zimanê wan hatîye qedexekirin û hatine koçberkirin. Bi ser da kî li hemberî van neheqîyan serî hildabe hatîye îşkencekirin û hebskirin Ji ber wê em dikarin bibêjin ku erdê kurd lê dijîn mêtingeh e.

## 1.2 Rabêja Mêtingerîyê

Berê piranî mêtingerî ji alîyê mêtina aborî ve dihat dahûrandin û dermanê rizgarîyê jî bi vê pirsgirêke ra têkildar dihat nîqaşkirin. Kesayetên dijmêtinger jî bivênevê di serî da di bin tesîra marksîzmê da bûn, lêbelê nêrînên marksîst ji bo famkirina mêtingerîyê têr nedikir. Yek ji kesên vê rastîyê haydar jî Franz Fanon bû. “Dinyaya mêtingehan dinyayeka dabeşbûyî ya du parçeyî ye. Xeta jiheveqetînê jî bi sînor, leşkergeh û qereqolan ve tê temsîlkirin. Di mêtingehan da mixatabê fermî û sazîyî yê mêtinkirî polîs û artêş in. Di welatên kapîtalîst da, di navbera mêtinkirî û desthilatdarîyê da hejmareka zêde aqilmend, şêwirmend û hiştevlihevker hene. Di heremên mêtingehan da berovajî, temas ji alîyê hebûna polîs û artêşê ve û bi rêya wan jî desttêwerdanên bênavber û nerasterast pêk tê. Bi derbên qûndaxan û napalman nelivîna ji cihê xwe tê saloxdan.” (Fanon, 2013, r. 44) Paşê gotinên xwe weha didomîne. “Di mêtingehan da binavahîya (infrastructure) aborî di heman wextî da superavahîyek (superstructure) e jî. Sebeb, encam e: Ji ber ku hûn spî ne dewlemend in, ji ber ku hûn dewlemend in hûn spî ne. Dema ku li ser pirsgirêka mêtingerîyê nîqaş hatîye kirin mecbûr maye ku marksîzm xwe hinek nerm bike. (Fanon, 2013, r. 47) Bawerîya marksîzmê ew bû kû nakokîyên di nav civatê da dê dawî li kapîtalîzmê bianîya. Marksîzm civat wekî du çînên dijberî hev qebûl dikir. Li alîyekî proleter li alîyê din jî burjûva hebû. Ji ber nakokîyên kronîk ên kapîtalîst dê burjûva her ku biçûya kêmtir û dewlemendtir; proleter jî berevojîyê vî tiştî dê her ku biçûya zêdetir û xizantir bibûya. Talîya talî dê vê nakokîyê dawî li kapîtalîzmê bianîya. Lê ev pêşbînî rast derneket û kapîtalîzm têk

neçû, heta mirov dikare bibêje ku hîn bi hêz derket di vî şerî da. Li ser vêya hîn teorîdanerên marksîst li ser sedema serkeftina kapîtalîzmê fikirîn û bi ramanên xwe, asoyên marksîzmê firehtir kirin. Yek ji wan kesan jî Gramscî bû. Gramscî bal kişand ser erêdanîya civakê ya li hemberî desthiltdarîyê. Li gor wî desthilatdarî hegemonyaya xwe tenê ne bi rêya zor û şîdetê di heman wextî da bi rêya qanihkirin û qezenckirina erêdanîya civakê jî saz dike. Berê jî di nav termînolojîya marksîst da têgeha hegemonyayê dihat bikaranîn, lê bi Gramscî ra wateyeka nû lê bar bû, bi ser da wî ji bo famkirina xurtbûna kapîtalîzmê rêyên nû nîşanî me dan. “Li gor wî tiştê ku pergala kapîtalîst a bi çîn li ser lingan dide sekinandin, tenê ne desthilatdarîya newekhev a sîyasî û aborî ya vê çinê ye, bi îfadeya Gramscî hegemonyaya raman û bîrdozîya burjûvayê ye. Bi îfadeyeka din, di kapîtalîzmê da tehekum tenê ne fermî û an jî bi awayê zexta fizikî ye, di heman wextî da tehekuma li ser ziman, sinc, çand û aqlê selîm e...Wateya hegemonyaya îdeolojîk, şûngirtina ramanên mixalif û qebûlkirina wekî aqlê selîma serdemê ye. Gramscî balê dikişîne ku bîrdozî çawa di huner, wêje, pergala perwerdeyê, ragihandina girseyî, zimanê rojane û çanda populer da ango bi kurtasî di hemû qadên civakê da berbelav e û xwe çawa tê da veşartîye. (Bulut, 2011, r. 197) Gramscî bala marksîstan ji binavahîyê kişand li ser superavahîyê ku çawa li ser hev bandor dikin. Li gor marksîstên ortodoks, dewlet tenê bi zextê dihat wesfkirin, alîyê wê ya qanihkirinê dihat piştguhkirin. Gramscî jî bal kişand bi qasî zext û şîdetê heta ji wan giringtir û ji bo desthilatdarîyê ya pêwîst erêdanî û qanihkirina gelî ye. Vê nêrînê îlham da teorîdanerên marksîst ên din. Yek ji wan jî postmarksîstê navdar Louis Althusser bû. Wî nêrînên Gramscî giring, lê kêm didîtin. Li gor wî Gramscî di teorîya xwe da gelek cih vala hiştibûn. “Li gor Althusser amraza dewlet û desthilatdarîya dewletê du tiştê ji hev cuda ne. Ji ber ku desthilatdarîya dewletê dest jî biguherîne amraza dewletê hertim li ser kar e bi ser da çîna ku li ser desthilata dewletê ye bi salan jî li ser be nikare bi tevahî amrazên dewletê nifûz û kontrol bike. Û paşê jî îfade dike ku cudahîya amraza dewletê û desthilatê jî têrî famkirina vê pergalê nake û li amraza zextê ya dewletê amrazên îdeolojîk ên dewletê jî zêde dike. Ev nêrîn dahûrandina dewletê ya Gramscî tîne bîra mirovî û Althusser jî vê şibandinê qebûl dike û îfade dike ku Gramscî jî

ferq kiribû dewlet tenê amrazên xwe yên zextê bi kar nayîne, di heman wextî da amrazên cuda jî bi kar tîne, lêbelê Gramscî nekarîye vî tîştî baş teorîze bike û raxîne ber çavan. Li gor Althusserî amrazên zextê yên dewletê hikûmet, rêveber, artêş, polîs dadgeh in û bi rêbaza zextê dixebitin. Amrazên îdeolojîk ên dewletê jî bi rêya bîrdozîyê dixebitin. Amrazên îdeojîk ên dewletê wek AÎDeyê dê bê kurtkirin û Althusser wan wiha disenifîne. AÎDên dînî (pergala dêran a cihêwaz), AÎDên malbatî , AÎDyên dadî, AÎDên sîyasî (pergala ku partîyên cihewaz jî di nav xwe da dihewîne), AÎDên komeleyî, AÎDên ragihandinê (çapemenî, radyo, televîzyon), AÎDên çandî (wêje, hunerên bedewnasîyê, spor)." (Althusser, 2000, r. 30-34) Althusser nîşanî me dide ku amrazên îdeolojîk ên dewletê çiqas xurt in û çand û huner jî ji vê rastîyê ne azade ne. Ev nêrîn ji bo famkrina sepandinên mêtinger jî derfetên nû derdixînin holê. Hezên mêtinger ji bo ku kes, kom û gelê mêtinkirî qanih bikin û erêdanîya wan qezenc bikin bi awayekî çalak perwerde, çapemenî û wêjeyê bi kar tînin. Bi wan amrazan li gor xwe heqîqetekê ava dikin û çerxa bişaftinê li gor dilê xwe dizivirînin.

Micheal Foucaultî nêrîna Altussherî hinek din jî bi pêş da bir. Wî serê xwe bi meseleya desthilatdarîyê êşand. Li gor wî pirsgirêka sedsala 19an kedxwarîya aborî û xizanîyê bû û van pirsgirêkan bi xwe ra faşîzm û stalînîzm afirandin. Di her du pratîkan da jî tiştê hevpar zêdehîya desthilatdarîyê bû. Li gor wî pirsgirêka bingehîn a sedsala 20î jî pirsgirêka desthiltdarîyê ye. "Di dirêjîya çil salên dawîn da, bi têkçûna nazîzmê û bipaşveçûna stalînîzmê ra di heman wextî da desthilatdarîya ku bi awayekî şênber tiştên wekî şîdet, dijwarî û tewşîtîyê derdixîne holê çi ye?" (Foucault, 2002, r. 29) Focaultî di serî da pênaseya klasîk a desthilatdarîyê qebûl nekirîye. Li gor pênaseya klasîk, desthilatdarî tiştekî negatîf e, xwedî navendekê ye, xwedîyên wê hene û bi rêya burokrasîyê jî bi rê ve diçe, lê ew wiha nafikire. Li gor Foucaultî divê desthilatdarî wekî hêzeka ne bi awayên ji navendekî ber bi hawirdorê, ji jor ber bi jêr, ji tevahî ber bi qismî ve bê lêkolînkirin. Berevajîyê wê, desthilatdarî divê bi awayên ji jêr ber bi jor, ji qismî ber bi tevahî, ji desthilatdarîya mîkro ber bi desthilatdarîya makro bê lêkolînkirin. Desthilatdarî jî xwe di nav

rabejê da vedişêre û bi saya wê tê hilberandin. “Rabêj jî li gor Foucaultî bi rêbaza vederkirinê (kontrolkirin) tê hilberandin. Yek ji wan “qedexe” ye…Yek jê hêmana vederkirinê ya ku di nav civatê da tê dîtin jî dijayetîya baqiltî-dînîtîyê ye… Hêmana sêyem a vederkirinê jî “dijayetîya rastî-çewtî”yê yan jî vîna rastîyê ye.” (Güneş, 2013, r. 57-58) Foucaultî hêmana vederkirinê ya dînîtî-baqiltîyê, di berhema xwe ya di *Dîroka Dînitî*yê da lê kola. Di vê berhema xwe da nîşanî me da ku ka dîn heta sedsala 18an çawa di nav civatê da bi azadî digerîyan û nedihatin dîtîn. Paşê dîn-dînîtî bi rêya pratîkên rabêjî û pratîkên nerabêjî di nav klînîk û tîmarxaneyan da hatin hepskirin û bi rêya vê jî baqiltî ji nû ve hat pênasekirin. “Foucault li dînîtîyê wekî kategorîyeka nasnameya mirovan nêrî û dest bi lêkolîna dînîtî çawa ji alîyê rêzik, pergal û rêbazên curbicur ve tê hilberandin an vehilberandin û dîsa bi saya wan çawa ‘normalbûn’ê diafirîne û ji dînîtîyê vediqetîne, kir. Vê pergalê dirûv dida ‘pergala rabêjê’yê ya ku cihê zanîn lê tê avakirin û hilberandin an jî tevahî herêmên têgehî. Pergala rabejê, tenê ne tiştê lê tê fikirîn an jî tiştê tê gotin dihewîne; di heman wextî da dê çi bê gotin û neyê gotin, dê çi wekî rasyonel bê qebûlkirin û çi bê vederkirin, dê çi wekî dînîtî û bêîtaetî bê qebûlkirin û dê çi wekî nexweşî yan jî çi wekî ji alîyê civakê ve bê pesinandin, birêkûpêk dike. Bi vê wateya xwe rabêj, qad an jî herêmeka tevahî ye ya ku ziman bi şêweyekî dîyarkirî lê tê bikaranîn. Ev herêm rehên xwe (wekî têgeha bîrdozîya Gramsci û Althusserî) di pratîkên mirovan da, di sazîyan da û di çalakîyan da berdide. Bi rastî jî di nav civaka modern da rabêja derbara dînîtîyê da, xwe li sazîyên wekî tîmarxane û pratîkên wekî psîkîyatrîyê digire. Pratîkên rabêjî, nahêle ku takekes derveyî vê rabêjê bifikire ji ber wê jî rabêj di heman wextî da desthilatdarî û kontrolkirinê disepîne. “ (Loomba, 2000, r. 59) Foucault bi guman nêzî zanînê dibe û li gor fikra wî desthilatdarî bi rêya zanînê di nav civakê da bi reh dibe. Ramanên Foucaultî bandor li ser Edward Saîdî dike û têgeha rabêjê jî jê digire. Me li jor jî hinek qal kiribû li gor Edward Saîdî Rojava derbarê Rojhilatê da rabêjekê diafirîne û ev rabêj nahêle mirov derkeve derveyî wê. “Edward Saîd bi tezeka aşkera derdixîne holê ka otorîteya mêtinger çawa rabêjek hildiberîne û bi rêya vê rabêjê çawa hikum li ser Rojhilatê dike û desthiltdarîya xwe saz dike. Tawanbarkirinên xwe yên li dijî mêtingerîyê û hilberandinên

zanînê pê ra têkildar jî tetbîqên desthilatdarîyê di nav pêvajoya dîrokî û epîstemolojîk da nîqaş dike.” (Eren, 2013, r. 36) Edward Saîd di berhema xwe ya *Culture and Imperialism*ê da mînakên hîn deqên li Rojavayê hatîye afirandin dide û balê dikişîne van berheman çawa rabêjê ji nû ve hildiberîne. Edward Saîd tevlî li fikra Romana Rudyard Kiplingî ya *Kim*ê, bi tenê wekî qala jîyana Hindistanê dike nabe. Li gor wî ev roman xizmeta rewakirina mêtingehkirina Hindistanê dike. Condrad, Jane Austen, Thackeray û hemû nivîskarên îngilîz ên nav sedsala 19an jî avakarên rabêja kolonyal in. (Saîd, 2010, r. 132-134) Em ê di beşa xwe ya pêş da jî li ser alternatîfên van rabêjan pêkan e yan na û ev çawa sîrayetî deqên wêjeyî dikin bisekinin.

## 1.3. Rabêja Dijmêtingerîyê

Li hemberî êrişên mêtingeran helbet berxwedan jî pêk hat. Vê berxwedanê piranî rengekî neteweperwer girt û li gelek cihan jî bi ser ket û mêtinkirîyan xwe ji dagirkeran rizgar kir. Lê ev pêvajo bi rehetî çênebû. Ji ber mêtinger tenê erdê mirovî dagir nakin. Dixwazin ji nû ve dirûvekê bidin hiş û mêjîyê gelê mêtinkirî û dagirkerîya xwe li ba wan rewa bikin. Franz Fanon di berhema xwe ya *Çermê Reş* û *Rûpoşa Spî* da li ser meseleya derûnîya reşikan, kompleksa xwekêmdîtinê û bîyanîbûnê hûr û kûr dibe. Hîn di destpêka berhema xwe da dibêje, “Mirovê reşik, ne mirov e.” (Fanon, 2014, r. 2) Li gor wî mirovê reşik ji mirovên spî ra rêzdar e, lê ji gelê xwe fedî dike. Dizane nikare rengê çermê xwe biguherîne û ev jî bi xwe ra parçebûneka gîyanî tîne. Helbet ev rasthatin bêyî berxwedanê pêk nayê, lê ji bo wî jî hîn şert hene. Ew jî hayjêhebûna rewşa heyî ye. “Dekolonîzasyon bêyî ferqkirinê pêk nayê, ji ber ku berê xwe dide hebûnê, hebûnê ji bînî da diguherîne, ji ber windakirina cewhera xwe temaşevanên parçebûyî diguherîne û dike hema hema aktorên bijartî û ezamet ên ku di bin projektora dîrokê da tên dîtin.” (Fanon, 2013, r. 42) Piştî hayjêhebûnê jî berxwedan dest pê dike û ev berxwedan bêyî şîdetê pêk nayê. Ji ber mêtinger desthilatdarîya xwe bi zorê û heza leşkerî saz dikin. “Mêtingerî şîdeta tazî ye û ancax şîdeteka jê mezintir rastî wê bê, dê serê xwe bitewîne.” (h.b. r.42) Heta bawer dike ku şîdeta li dijî mêtingeran alîyê wî yê azadker jî heye.

Bi saya wê şîdetê kirdeya çewisandî dê ji nû ve xwe vejîne û bibe mirovekî azad. Ji ber vî tiştî şîdet dibe medîtasyoneka bêqisûr. (h.b. r.89) Albert Memmî jî rêya xelasîya mirovê mêtinger, di ji nû ve kifşkirina kesayeta xwe û rûmeta xwe ya xweser da dibîne û serhildan, bi redkirina mêtinger dest pê dike. Divê tiştê mirov pê biheyîre ne serhildanên gelan be; berovajî divê em pê biheyirin ku ji ber çi serhildan ne zêde û ne hîn bihêztir in. (Memmî, 2014, r. 133) Şoreşgerê Afrîkaya Başûr Steve Biko ji bo gava ewil dibêje, divê em mirovê reşik bên ser hişê xwe, hewa lê xin nav qalikê wî yê vala, rêz û rûmeta wî lê vegerînin û bixin bîra wî ku ew sûcdar e, ji ber ku welatê wî tê sûîstîmalkirin û rê dide li ser welatê wî xirabî hikum bike. Ev tişt dê 'hişmendîya reşikan' ava bike û ev hişmendî bi xwe ra şoreşê bîne û ev şoreş jî bi xwe ra hunereka nû biafirîne. (Biko, 2014, r. 40-45)

Li gelek cihan serhildanên gelan gihîşt encamê û li ser kaxezê azad bûn, lê van serkeftinan dawî li mêtina aborî, çewisandina madûnan û kompleksa xwekêmdîtînê neanî. Ev rewş hîn teorîdaner xerqî nav bedbînîyê kir. "Foucault, ji ber rabêj û pê ra têkildar jî desthilatdarî li her derê ye û tenê ji bo hebûna xwe bi awayekî sînordar destûr dide berxwedanê ji ber wî jî xelasîyeka giştî pêkan nabîne. Bawerîya Spivakî jî bi axaftina madûnan tune ye, lê entelektuel dikare wan temsîl bike. Lê divê entelektuel jî li dijî dafika homojenkirin û romantîzekirina madûnan hişyar be." (Loomba, 2000, r. 262-263) Gramscî jî ji bo têkoşînê giringî dide entelektuelan û wan dike du beş. Beşa ewil entelektuelên kevneşopî ye ku alîkarîya avakirina hegemonyaya burjûvayan dikin. Vîya jî bi rêya huner, wêje, perwede, çapemenî hwd dikin. Beşa duyem entelektuelên organîk in û ew bi xwe jî di nav çîna karkeran da ne. Peywira wan jî li dijî hegemonyaya burjûvayan şerkirin e û avakirina hegemonyayeka nû ye. (Bulut, 2011, s. 197) Edwar Saîdî ji ber di berhema xwe ya *Oryantalîzm*ê da tenê qala alîyê mêtinger kirîye û guh nedaye alîyên mêtinkirî, hatîye rexnekirin. Ew jî di berhema xwe ya di *Culture and Imperialism*ê da bersiv dide van rexneyan. "Tu rasthatinên emperyal wekî êrişkarekî çalak yê rojavayî û nîştecihê belengaz û bêlebat neqewimîye; hertim berxwedan bi awayekî çalak pêk hatîye, pirî caran jî di encamê da berxwedan bi ser ketîye." (Saîd,

2010, r. 12) Bi van ramanên xwe wekî yek jê piştevanê teorîya xwe M. Foucaultî nafikire û serkeftinê pêkan dibîne.

Me dît ku di pêvajoya mêtingehkirinê da ziman û wêje jî ne masûm in û ji bo rewakirina mêtingerî û qezenckirina erêdanîya mêtinkirî da peywirekî çalak digirin li ser xwe. Edward Saîd bal dikişîne romana modern a ewil *Robînson Crouse*yî û bi xwe çîrok jî çîroka rojavayîyekê ye ku ji xwe ra ji bo jîyanê cihekî nû diafirîne. (h.b. r.13) Di vê romanê da pêşqebûlên klîşe yên mêtingerîyê bi awayekî beloq hene. Robînson bi awayekî xwezayî xwedî ye, În jî xulam e. În nezan e û hewcedarîya wî bi perwerdehîyê heye û ev kar jî helbet li ser milê yekî medenî ye. Tenê ne di vê romanê da di gelek deqên wejeyî da çi aşkera çi jî veşartî mirov dikare rastî şopên rabêja mêtingerîyê bê. Ger em dîsa bên li ser Fanonî û ramanên wî yên li ser mêtingerî û zimanî, em ê bibînin ku çawa mil dane hev û bi hev ra meşîyane. Me gotibû mirovê reşik hertim dixwaze bibe spî, lê dizane nikare rengê çermê xwe biguherîne. Ew jî ji bo bibe spî serî li rêyên din dide. Yek ji wan rêyan jî devjêberdana çand û zimanê xwe ye. Çiqas zimanê “Creole”yê ji bîr bike û wekî ku ji bîr kirîye bike û hînî fransizî bibe ew dê ewqas nêzî spîbûnê bibe. “Mirovê reşik ji çekekî/ê, ji arnawidekî/ê şêrîntir an jî layiqî hezkirinê nîne. Û divê tiştê bê kirin azadkirina mirovî be ne guhertina rengî be.” (Fanon, 2014, r. 2) Kêmdîtina zimanî û çanda xwe refleksa herî berçav a gelê mêtinkirî ye. Wê çaxê ji bo azadkirina mirovî zimanê dayikê enîyeka xurt e. Bikaranîna zimanê xwe û xwedîderketina çanda xwe ji jehra parçebûna gîyanî û kompleksa xwekêmdîtinê ra dê bibe derman û birînan bicebirîne. Wê çaxê em dikarin bibêjin ku nivîsîna bi zimanê xwe jî bi serê xwe helwesteka dijmêtinger e, lê ev nayê wateya mirov naverokê piştguh bike. Ji ber ku rabêja mêtingerîyê ewqasî xurt e ku ger mirov hişyar nebe bi hêsanî rabêja mêtingerîyê sîrayetî deqan dike. “Ger em qebûl bikin ku mêtingeran her tim di sazkirina rabêja mêtingerîyê da tevî amrazên din deqên wejeyî kirine amraz û li ser çand, derûnî, kesayeta gelên mêtinkirî şopên kûr hiştine/dihêlin, paqijkirina şopên desthilatdarîya mêtingeran an deşîfrekirina rabêja mêtingerîyê çima bê problematîzekirin? Bi gotineka din ger bindestkirina deqî hebe çima berxwedaneka deqî jî tune be? ” (Adsay, 2014, r. 52) Steve Biko ji bo avakirina

‘hişmendîya reşikan’ axaftina bi zimanê xwe derdixe pêş. Ji bo girseyên razayî bi xwe bihesin û hişyar bibin tekane rêya vê jî îdraqkirina avahîya dinyaya reşikan e. Helbet ‘hişmendîya reşikan’ dixwaze vê çêbike û ne hewce ye ku em bibêjîn yê vê jî çêbike reşik bi xwe ne. Paşê serî li gotinên Sekou Toureyî dide: Ji bo em tevlî şoreşa Afrîkayê bibin nivisîna stranên şoreşger ne bes e; divê hûn şoreşê bi mirovan ra bisêwirînin. Û dema we ev çêkir dê stran ji xwe ber bê. (Biko, 2014, r. 44-45) Clemence Scalbert-Yucel bi referansa Barbara Harlowê wêjeya kurmancî ya hevçerx wekî wêjeya berxwedanê tarîf dike. “Barbara Harlow wêjeya berxwedanê wekî wê wêjeya ku yekser ji tevgerên azadîya neteweyî derdikeve pênase dike. Bi ya wê, ji ber çalakî û sedeqata xwe ya bo têkoşîna li dijî zordestîyê, ew wêje bi wan nezerên rojhilat-navendî nayê famkirin yên ku armanca wêjeyê tenê bi xwe ve bi sînor dikin. Metnên vê wêjeyê, dibêje Harlow, ne bi şikl an forma xwe, belkî tenê bi erk û armancên xwe -bi piştgirîya li tevgerên azadîya neteweyî- xwe ji metnên din cuda dikin. Wêjeya kurmancî ya hevçerx gelek bi asayî dikeve nav pola wêjeya berxwedanê: nivîserên milîtan an çalak û wêjeyeka dilsozê dozê, ku piştgirîya tevgera neteweyî ya kurd an jî bi gotineka firehtir, ya gelê kurd dikin. (Scalbet-Yucel, 2014, r. 71) Helbet romanên Helîm Yûsivî jî parçeyeka rabêja dijmêtingerîyê û edebîyata berxwedanê ye. Em ê jî hewl bidin di romana wî ya *Sobarto* da şopên vê rastîyê bişopînin.

## Beşa Dûyem: Dahûrandina Romanê

### 2.1. Helîm Yûsiv

Helîm Yûsiv di sala 1967an da li Amûdê ji dayik bûye. Li Helebê beşa hiqûqê xwendîye û ji sala 2000î ve wekî piranî nivîskarên kurd ji welatê xwe koçî Almanyayê kirîye û li wir dijî. Nivîskarekî gelekî berhemdar e. Bi dehan gotarên wî yên wêjeyî di kovar û rojnameyên erebî û kurdî da weşîyane. Heta niha berhemên wî bi kurdî, erebî, tirkî û elmanî çap bûne. Bi navê Komara Dînan pirtûkeka wî jî hatîye çapkirin. Ev pirtûk ji şeş deqên şano yên di demên cuda da hatine nivîsîn, pêk tê. Hin deqên mîna *Kevçî* û *Nivîskarê bê Gore* û *Rawestgeh* nivîskar Helîm Yûsiv bi xwe ew amade kirine. Hin ji wan ji çîrokên wî yên

mîna *Bidarvekirina Pozekî* û *Sol û Serî* hatine girtin û ji hêla nivîskar bi xwe ve wekî lîstikên şanoyê hatine nivîsîn, yan jî mîna çîroka *Komara Dînan* ku ji hêla Teatra Jiyana Nû ve, koma şanoyê ya Navenda Çanda Mezopotamya li Stenbolê hatiye amadekirin û pêşkêşkirin. Di serî da bi kurteçîrokan dest bi nivîsê kirîye û di romanên wî da jî em bandora çîroknûsîya wî dibînin.

Berhemên Helîm Yûsiv:

1- Mirî Ranazin (çîrok, 1996)

2- Mêrê Avis (çîrok, 1997)

3- Jinên Qatên Bilind (çîrok, 1998)

4- Sobarto (roman, 1999)

5-Memê bê Zîn (çîrok, 2003)

6- Tirsa Bê Diran (roman, 2006)

7- Gava ku Masî Tî Dibin (roman, 2008)

8- Romana Kurdî (lêkokîn,  2011)

9- Auslander Beg (roman, 2011)

10- 99 Morîkên Belavbûyî (roman, 2015)

11- Wehşê Di Hundirê Min De (roman, 2018)

12- Firîna Bi Baskên Şikestî (roman, 2019)

13- Komara Dînan ( şano, 2022)

## 2.2. Di Romana Helim Yûsiv A *Sobarto* da Rabêja Dijkolonyal

Roman ji 203 rûpelan pêk tê. Di sala 1999an da li Stenbolê ji nav Weşanên Avestayê hatîye weşandin. Edîtorîya wê jî ji alîyê Abdullah Keskinî ve hatîye kirin.

Roman ji heft derîyan pêk tê û her derî jî qala beşeka jîyana lehengê Silêmanê Dawid dike. Mijara romanê jî evîna Silêmanî û Belqîsê ye. Romaneka alegorîk e. Kes û qewîmînên romanê xwedî hin sembolan in. Aşkera xuya ye Sobarto jî welatê kurdan e û lehengê me Silêman jî ji wir e. Bi xwe epîgrafa destpêkê ya pirtûkê vê angaşta me xurttir dike.

“*.....Û herêma Sobarto, li gor nivîsên mîxî, di sê hezar salên berî zayînê de, zêdeyî carekê ketiye bin destên dagirkeran.* (Yûsiv, 1999)

Di destpêka romanê da Silêman nifir li Sobartoyê dike û dixwaze wê bişewîtîne.

*“Bişewite Sobarto!*

*Mal bi mal bişewite. Ey qîza maran! Ey welatên teriyên dirêj û berovajî. Kolan bi kolan bela agirê kîna nava min li te bibare. Bela mirin xaka te bost bi bost bixwe. Bela marên reş jahra xwe berdin hinavên te. Petrola dinyayê tev de têra min nake. Divê, bi kêmanî ez te hezar carî bişewitînim.”* (Yûsiv, 1999, r. 13)

Paşê em di nav herikîna romanê da fam dikin Silêman ji ber tiştên hatî serê wî dîn bûye û dixwaze Sobartoyê bişewitîne. Ev gefa wî, şewata sînemaya Amûdê tîne bîra Sobarîyan. Bîra kolektîf zindî, guherbar û ji bo desttêwerdanê vekirî ye. Helbet mêtingeran jî xwestîye bîra civakî ya gelê mêtinkirî bimiçiqînin û wan ji bîra wan bê par bihêlin. Helbet bîra kolektîf qels be dê mêtinkirî hêsantir bên bişaftin. Nivîskar jî li hemberî vê dixwaze bîra kolektîf zindî bihêle û helwesta xwe ya dijmêtinger bibîrxistina karesateka weha jî nîşan dide. Silêmanê leheng jî bi birayê xwe di nav wî agirî da ne. Silêman bi birîndarî xelas dibe, lê birayê wî di nav wî agirî da dimîne.

*“Wê zivistanê hêsirên diyên kezebşewitî ji baranê behtir bariyan û Şermola têra du sed laşên piçûçik û şewîtî nedikir, yê ku ji agir filitî dûmanê bêhna wî çikand....Silêman jî yek bû ji van sedê ku vegeriyabûn malên xwe û beyî ku birînên mezin di gewdeya wan de çêbibin, lê birînên fireh di canên wan de şîn hatibûn, ku ji bilî mirinê, tu tişt nikare wan tune bike. Her ku diya wî hêrs dibû, jê re digot:*

*-Xweska tu ji dêvla birayê xwe yê mezin bişewitiya.”* (h.b.r. 14-15)

Helim Yûsiv di romana xwe da gelek ji zargotina kurdî jî sûd wergirtîye. Nivîskar qala mirina bi êşa piştê dike. Bikaranîna metafora êşa piştê ne belasebeb e. Peyva piştê xwedî gelek bikaranîn e û hinek ji wan: bi wateya xwe ya piştevanîyê ‘pişt girtin’, bi wateya xwe pêbawerbûnê ‘pişt pê girêdan’, bi wateya xwe ya bi yekî an tiştekî bawerbûn ‘pişt dan’, bi wateya xwe ya ji rewşa xirab rizgar nebûnê ‘pişt lê rast nebûn’ bi wateya xwe ya têkçûnê ‘pişt lê şikênandin’ê. Bi ser da jî çîrokeka gelerî jî heye di derbarê êşa piştê da û weha ye: Yek bi çoyê li zikê yekî dixwe û yê derbxwarî dibê, ax pişta min. Yê lê dixe diherîye û dipirse min li zikê te xist te çima go ax pişta min. Yê din lê vedigerîne û dibêje, ger pişta min hebûya te nikaribû li min bixista. Ji van mînakan jî em tê digihîjin nivîskar bi zanebûn metafora êşa piştê bi kar tîne û mebesta wî jî ev e: Kurd mêtinkirî ne û bêxwedî ne. Taylan Şahan Tarhan jî di teza xwe da balê dikişîne metafora piştê, di çîrok û romanên Helîm Yûsivî da. Li gor wî hêmaya pişt di gelek deqên wî da derzaneka hûnakê ye. Ew jî mînakên biwêjên ku pişt tê da hene dide û varyanteka din a çîroka gelerî ya navborî jî dide. Paşê digihîje vê encamê: Sedema rewşa heyî ya kurdan bêpiştbûn e. (Tarhan, 2013, r. iv, 29, 34, )

*“Wê rojê êş ketibû pişta min, ez tirsiyam ku wek her yek ji malbata me ez jî bi êşa piştê herim. Her yekî ku pelê wî ji dara jiyanê diweşe, bavê min jî wilo digot, dibêje “Ax pişta min” û pişt re can dispêre xwedê. Em xelkên Sobarto me jî ev nexweşî ji sedê salan de ji bav û kalan girtiye Her ku mirovek ji me, ji ber êşê, destê xwe diavêje pişta xwe, jixwebere xelk li dorê dicivin û li benda mirina wî dimînin.”* (h.b.r. 17)

Nivîskar di rûpelên pêş da dîsa Silêmanî dide axaftin derbara êşa piştê da. Silêman bang li kalê xwe yê heştê salî dike.

*“ Nexweşiyê pişta te xwar û tu ketî. Hîn bavê min ji karê giran tê xwarin. Dema rûdine diweste lê êşa piştê ew jî girtibû. Kalo tê çima min bibî û ez hîn piçûk im? Nexweşî me dixwin û em jî hevdû dixwin.”* (h.b.r. 38)

Silêman sedema van êşan nizane heta ‘Pîra Felekê’ piştrast dike ku tenê hezkirin piştê dişikîne. Pîra Felekê jî lehengeka xwedî raz e. Qet pîr nabe, hertim ji nû ve ciwan dibe, lê tenê pê ra gopalê di destê wê da kevn dibe. Me li jor jî gotibû nivîskar berê xwe daye gencîneya zargotina kurdî û romana xwe bi alîkarîya zargotinê sêwirandîye. Pîrê wekî leheng di piranî çîrokên gelerî da xwedî rolên xirab in û wekî ‘pîra mirovxur’, ‘pîra dudiran’, ‘cadû’ hatine teswîrkirin. Pîra Felekê jî di romanê da temsîla desthilatdar/dewlet/mêtinger e. Bi xwe ev tişt dawîya romanê da hîn baştir zelal dibe.

*“ Hinekan digot ku “Felek” ew bixwe ya ku di çîroka Siyamend û Xecê ya gelêrî de tê dîtin û ew bixwe Felek e ya ku şiqamek li birayê wî qeregêtran xist û diranên wî xistibûn destên wî. Ji wê rojê de tu kes newêre li ber Pîra Felekê rabe, ligel ku tê gotin ku ew bixwe bi dû hemû bûyerên ku li Sobarto biqewimin de ye…. ‘Yê ku Pîra Felekê nas neke, Sobarto nas nake’.”*

(h.b.r. 18-19)

Dilê Silêmanî dikeve keçika mamostaya (xanim) xwe Belqîsê. Nivîskar dest bi qalkirina zarokatîya Silêmanî û rewşa Sobartoyê dike. Silêman dest bi dibistanê dike û bi zimanekî nû dihese, zimanê fermî. Ev ziman ji yê malê cudatir e. Di mêtingehan da piştî kontrola leşkerî bişaftina çanda mêtinkirî dest pê dike. Ev rêzik di hemû mêtingehan da tiştekî teqez e. Nivîskarê kenyayî Ngugai wa Thiong’o di berhema xwe da ev rewş wiha îfade dikir: li gor nêrîna min, ziman amraza herî girîng bû ku bi wê ruh hîpnotîze û dîl dikirin. Gule amraza bindestkirina fizîkî bû. Ziman amraza bindestkirina ruhî bû. Ka bi rêya azmûnên xwe yên dema perwerdeyê, bi taybetî yên di ziman û wêjeyê de, ez vê nîşan bidim…Lewma yek ji azmûnên herî fedîkar ew bû ku dema yek li derdora dibistanê bi Gikuyu dipeyivî bê

qefaltin. Kesê sûcdar cezayê fizikî didanê –ji sê heta pênc caran lêdana bi ço li ranê wan î tazî- an divîyabû lewheyeke metal ku li ser EZ GÊJ IM an EZ KER IM nivîsandibû bi stûyê xwe ve darde bikirina. Hin caran cezayê pere lê dihat birîn ku ji wan re pir zêde bû. Û mamosteyan çawa sûcdar tesbît dikirin? Di destpêkê da mamoste qomçeyek dida destê xwendekarekî û wî jî her kî bi zimanê xwe bipeyîvîya, ew dida destê wî. Di dawîya rojê de qomçe di destê kê de bima, wî navê kesê ku ew dabû destê wî dida û bi vî awayî li pey hev hemû sûcdar eşkere dibûn. Bi vî awayî zarok dibûn muxbîr û karê xayînbûna bi civata xwe ya herî nêz re, bi wan dihat fêrkirin.” (Thiong'o, 2018, r. 41,44) Tiştê zarokekî kenyayî û kurd nêzî hev dikin ne tenê temenê wan in di heman wextî rewşa wan a mêtingerîyê ye. Ji ber wê jî em ji çavderîyên Silêmanî naheyirin ku çawa tecrubeyên zarokên kurd dişibe yên zarokên kenyayî.

*“Berpirsyarê giştî yê dibistanê bi hêrs derbas bûbû hundir û fermana qedexekirinê dabû, çênabe zarok, şagirt ji bilî zimanê fermî bi tu zimanî bipeyive û ferman dabû xanima me jî da cezayekî herî giran bide şagirtê ku ne bi zimanê fermî bipeyive. Û em xelkên Sobarto, li dibistanan em hîn dibûn zimanê fermî ji bilî çend malbatan em tev de bi zimanekî din dipeyivin…Xanima me yek ji şagirtan kiribû berpirs, ji wî xwestibû ku navê her yekî bi zimanê malê bipeyive binivîsîne. Wê rojê darê xanima me şewt û jan bi destên me xistibû.* (h.b.r. 30-31)

Çavderîyên Silêmanî didomin. Îcar bala wî diçe ser ew kesên neSobarî û yên ji derve hatî. Ew zimanê fermî baş dizanin û li gor wan jî xwedî îmtîyaz in. Albert Memmî di berhema xwe da teswîra mêtingerên biçûk dide. Ewil dipirse, gelo çima mêtingerên biçûk piştgirî didin pergala mêtingerîyê? Li gor wî bersiv aşkera ye. Ji ber ku mêtingerên biçûk di nav vê pergalê da xwedî îmtîyaz in wisa dikin. Di nav vê pergalê da rewşa wan a ekonomîk, sîyasî û civakî bênîqaş ji ya komê mêtinkirî hertim baştir e. Kar û statu ewil ji wan ra tê veqetandin, hemû ezmûn bi zimanê wan e û kesek ji koma mêtinkirî bixwaze ji ezmûnê derbas be jî dijwarî derdixin pêşîya wî. Bi ser da jî alaya li ser sazîyan ba dibe alaya wan e, zimanê danûstandinê yê di nav civakê da yê wan e. Heta cilûberg û çanda wan jî dê ji alîyê komên mêtinkirî ve bên teqlîtkirin (Memmî, 2014, r. 31-33) Ji ber van sedeman ew

mêtingerên biçûk -mamoste, polîs, karmend- pir tund in û naxwazin dev ji îmtîyazên xwe berdin.

*Polîs û berpirs tenê ji derveyî Sobarto tên, ew bixwe dibin xwediyê her tiştî, ya balkêş ew e ku ligel vê hatina wan î vir hîç kêfa wan ji xelkên Sobartoyê re nayê. Me jî tim ji xwe dipirsî. Madem ewqasî ji me zivêr in û kêfa wan ji me re nayê çima xwe li me digirin? Çima ewqas bi qeflan tên cem me?*

*Gelo ev tên, tenê ji bo girr û kînê di nav me de zêde bikin? Me tiştek nizanîbû. Tiştê me didît ew bû ku bi dê û bavên me re dixeyidîn, henekê xwe bi wan dikirin û zimanê wan dikirin, berra wan didan û em û bav û bira û xwihên xwe ji bilî ku em paş de vegerin û herin malên xwe û ji bilî zêdebûna kîna li ser ol û dewlet û hemû zimanên dinyayê me nikaribû tiştek bikira.* (h.b.r. 31)

Silêman her înîyê bi bavê xwe ra diçe mizgeftê û li wir dîsa bi cudahîya zimanê malê û zimanê fermî dihese. Carekî din dibîne ku ancax bi rêya zimanê fermî dikare derkeve ser mînberê û bê guhdarîkirin.

*Wê çaxê min naskir ku bavê min tiştekî ji "xutba" înê fêm nake û yê xutbekar bi zimanê dibistanê xutbê dide û li jora menberê bi zimanê dibistanê û li jêr bi nimêjkeran re bi zimanê malê dipeyive. Min nas kir, yê ku here jor, ser menberê, divê bi zimanê dibistanê bipeyive yan ji çênabe hilkişe jor.* (h.b.r. 35)

Mijara bingehîn a romanê evîna Silêmanî û Belqîsê ye. Silêman ji roja Belqîs dîtîye dilê wî ketîye wê. Piştî Silêman mezin dibe û berîya biçe zanîngehê êdî evîna xwe ji Belqîsê ra dibêje. Belqîs herçend nebêje erê jî nabêje na jî û têkilîya xwe bi Silêmanî ra qut nake. Hertim ji bo Silêman bixwîne jî wî teşwîq dike. Em ê di dawîya romanê da hîn bibin ku ew jina spî ya ku ranên xwe hildide û petrol jê diherike Belqîs bi xwe ye. Û ev hevok gelek caran tê bikaranîn. *(Jineke spî...lingan hildide û ji nav herdu ranên ji hev dûr çûyî petrol diherike.)* Semboleka din a romanê jî Belqîs e. Ger Sobarto welatê kurdan be Belqîs jî dewlemendîya axa wî ye. Bi metafora petrolê jî balê dikişîne sedema parçebûna axa kurdan. Bi hevpeymana Sykes-Picotê axa kurdan ji alîyê dewletên mêtinger ve hat biparvekirin. Di vê parvekirinê da

کتێبەکە لە سیدییەکەشدا دووپات بووەتەوە و ئەمە کاریگەریی ئەرێنیی لە سەر فێرخوازان دەبێت.

لە پەیوەندی لەگەڵ پێوەری ڕەسەنێتیدا، ئەم توێژینەوەیە ئاوڕی لە دەنگی پاش زەمینە، شوێن و پەیوەندیی سروشتی دایەوە و بەپێی ئەنجامەکان هەر دوو بەرهەمەکە لەم ڕووەوە لاواز دەرکەوتوون؛ بە چەشنێ کە هیچیان گرنگییان بە دەنگی پاشزەمینە و شوێن نەداوە و کارێکی ئەوتۆش بۆ بەرزکردنەوەی ئاستی پەیوەندیی سروشتی نەکراوە، کە لە ڕستەی ناتەواو، وشەی پڕکەرەوە، وەستان و دوودڵیدا دەردەکەون. شیاوی باسە کە لە تۆمارکردنی ڕاهێنانەکاندا هەوڵ دراوە دەنگ و هەرای پاشزەمینە نەبێتە هۆی سەرلێشێوانی فێرخوازان؛ بە تایبەت *شارێ* ئەم ئەرکەی باشتر و زەلالتر بەجێ هێناوە و چۆنایەتیی تۆمارکردنی دەنگەکان لە ئاستێکی باشتردایە. بەڵام سەرەڕای ئەم لایەنە ئەرێنییە، لە هیچ کامیاندا بۆ نیشاندانی جێوشوێنی ئاخافتن و گوتوبێژەکان، لە هیچ دەنگێکی باکگراوند کەڵک وەرنەگیراوە.

هەروەها لە ڕووی دەربڕین و شێوەزارەوە، فرەڕەنگی لە ئاستێکی زۆر نزمدایە و گرنگییەکی بەرچاو بە ناوچە و بنزارە جیاجیاکانی زاری کوردیی ناوین و شێوە دەربڕینە جیاوازەکان نەدراوە. ئەڵبەت پێویستە ئەوە لە بەرچاو بگرین کە ئەم فرەڕەنگییە بۆ ئاستەکانی سەرەوە گونجاوترە و بۆ کتێبی دەستپێک ئەستەمە و لەوانەیە سەر لە فێرخواز بشێوێنێت. شیاوی باسە، *هینکەر*، هەر وا کە لە سەر بەرگەکەیدا نووسراوە، بۆ ئاستی دەستپێک ئامادە کراوە، بەڵام لە *شارێ*دا ئاماژەی لەم چەشنە نابینرێت.

خشتەی خوارەوە ئاوڕێکی خێرا لە ئاکامەکانی هەڵسەنگاندنی *هینکەر* و *شارێ* دەداتەوە.

**خشتەی ژمارە ٧: بەراوردی *شارێ* و *هینکەر***

| ژمارە | پۆل | ژێرپۆل | *هینکەر* | *شارێ* |
|---|---|---|---|---|

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| ١ | ئاستی کرداری | چالاکانە | ٥٥٪ | ٣٣٪ |
| | | ناچالاکانە | ٤٥٪ | ٦٧٪ |
| ٢ | کارلێکی کۆمەڵایەتی | مۆنۆلۆگ | ٣١.٥٪ | ١٦٪ |
| | | دیالۆگ | ٣١.٥٪ | ٣٦٪ |
| ٣ | ئێفێکتە دیدارییەکان | وێنە و هێما | ٦٦٪ | ٦٧٪ |
| ٤ | قۆناغەکانی ڕاهێنان | پێش گوێگرتن | ٢٠٪ | ٦٪ |
| | | کاتی گوێگرتن | ٥١٪ | ٤٤٪ |
| | | پاش گوێگرتن | ٢٩٪ | ٥٠٪ |
| ٥ | ئاخافتن | خاو/ خێرا | خێرا | خاو |
| ٦ | ڕەسەنێتی | دەنگی پاشزەمینە | نییە | نییە |
| | | شوێن | نادیار | نادیار |
| | | پەیوەندیی سروشتی | لاواز | لاواز |
| ٧ | دەربڕین | فرەڕەنگیی شێوەزار | یەکدەست | یەکدەست |
| ٨ | ئاخێوەر | زایەند | ژن و پیاو | ژن و پیاو |
| | | ژمارە | سنووردار | سنووردار |




پاشکۆی ژمارە ٢: ناوەرۆکی پەرتووکی فێرکاریی *شاڕێ*

پاشکۆی ژمارە ٣: ڕووبەرگی پەرتووکی چالاکیی *شارێ*


UNIVERSITY OF SULAIMANI
1968
زانکۆی سلێمانی

زانکۆی سلێمانی
بەڕێوەبەرێتی سەنتەری زمان و کلتور
بە هاوکاری بەشی کوردی - کۆلێژی زمان

شارێ
بۆ فێربوونی زمانی کوردی
کتێبی چالاکی

دانانی:
پ.ی.د.شیلان عومەر حسێن
م.ی.شۆخان عەزیز عومەر
م.ی.باخان ئەحمەد حەمەئەمین
م.ی.ساکار عەبدوڵڵا حەسەن
م.ی.بێستون عارف عەزیز
م.ی.بێستون ئەبوبەکر عەلی

٢٠١٨

پاشکۆی ژمارە ٤: ڕووبەرگی هینکەر




پاشکۆی ژمارە ٥: ناوەرۆکی هینکەر

| بابەت | ڕێزمان | وشەکان | لاپەڕە |
| --- | --- | --- | --- |
| ١ ئەلفبێی زمانی کوردی | | | ٦ |
| ٢ سڵاوکردن | پرسیار و وەڵام<br>جێناوی لکاو و سەربەخۆ<br>ژمارە<br>تاک و کۆ | جێناوەکان<br>ناوی کەس و شتەکان<br>ژمارە<br>ناوی تاک و کۆ | ٨ |
| ٣ ناسین | ڕستەی ڕانەبردو<br>جێناوی لکاو<br>پرس<br>ژمارە | وڵاتەکان<br>شوێن<br>پیشە | ١٤ |
| ٤ زانیاریی کەسی | ڕستەی ئەرێ<br>ڕستەی نەرێ | پیشە<br>ناونیشان<br>ژمارەی مۆبایل<br>زاراوە کۆمەڵایەتییەکان | ٢١ |
| ٥ خێزان و هاوڕێ | دیارخراو و دیارخەر<br>کرداری هەبون | خێزان و هاوڕێ | ٢٧ |
| ٦ ژیانی ڕۆژانە | ڕستەی ڕانەبردوی سادە<br>کردارە نەشازەکان | وەرزش<br>خواردن و خواردنەوە<br>ژمارە و نرخ | ٣٢ |

| بابەت | ڕێزمان | وشەکان | لاپەڕە |
|---|---|---|---|
| ٧ پشو | کرداری لێکدراو<br>ڕستەی ڕابردوی سادە | ڕێککەوت<br>گەشتکردن | ٣٩ |
| ٨ کات | کردارە شازەکان<br>کرداری لێکدراو<br>ئاوەڵکردار | کاتژمێر<br>ڕۆژەکانی هەفتە<br>هەرگیز - هەندێکجار - هەمیشە | ٤٧ |
| ٩ ناوماڵ و هاوسەرگیری | ئاوەڵناو<br>ڕستەی ڕانەبردو<br>ڕستەی داخوازی<br>ڕستەی لێکدراو | ئامۆژگاری<br>ماڵ<br>کەشوهەوا | ٥٤ |
| ١٠ ناوبانگ | کرداری لێکدراو<br>ڕستەی پێشنیاز<br>ئاوەڵکرداری شوێنی | ئاراستەکان<br>ساڵ<br>ناوبانگ | ٦٢ |
| ١١ ڕەنگ و جلوبەرگ | ڕستەی ڕانەبردوی<br>بەدەوام<br>ڕستەی ڕابردوی بەردەوام | ڕەنگ<br>شێوازی جلوبەرگ<br>یادگاریەکانی ڕابردو | ٧٠ |
| ١٢ تۆرە کۆمەڵایەتییەکان | ڕستەی ڕابردوی تەواو<br>کرداری ناسادە<br>ڕستەی بکەر نادیار | دەربڕینە کۆمەڵایەتییەکان<br>گەشت<br>تۆرە کۆمەڵایەتییەکان | ٧٨ |



٥

## سەرچاوەکان - Çavkanî / Kaynakça /References

Heidary, Masoumeh. (2022). *The Study and Comparison of the Listening Activities in Two ELT Books: Vision I vs. Solution I*. Dr. Fereidoon Vahdany (Supervisor), Dr. Hoda Divsar (Advisor). Thesis Submitted in Partial Fulfillment of the requirement for the Degree of M.A in English Teaching, Department of linguistic and foreign languages, Payame Noor University of Rasht (Iran).

Kim, Y.-S. G., & Pilcher, H. (2016). "What is listening comprehension and what does it take to improve listening comprehension?" In R. Schiff & M. Joshi (Eds.), *Handbook of interventions in learning disabilities* (pp. 159-174). New York: Springer.

Kurt, Şehmuz. (2017). "Li gorî Pîvanên Cunningworth Nirxandinek li ser *Hînker*ê". *Nûbihar Akademî*, sal 4, jimar 7, r. 65-77.

سەلام خالد، هیوا. (٢٠١٩). *هینکەر کوردیی ناوەندی*، پەرتووکی خوێندکار بۆ ئاستی سەرەتایی. ئەستەنبۆڵ: ئەنستیتۆی کوردیی ئەستەنبۆڵ.

عومەر حسێن، شیلان و هاوکاران. (٢٠١٨). *شارێ بۆ فێربوونی زمانی کوردی*، کتێبی فێرکاری. سلێمانی، زانکۆی سلێمانی.

وکیلی فرد و همکاران. (١٤٠٠). "ارزیابی منابع آموزشی زبان فارسی برای دانشجویان غیرایرانی: واکاوی درسنامه مینا". *پژوهش و نگارش کتب دانشگاهی*، دوره بیست و پنجم، شماره ٤٨، بهار و تابستان، صص. ١–٢٨.

# Hêmanên Hevokê yên Alîkar: Hêmanên Hokerî[*]

Sinan GÜLTEKİN[*]


**Kurte**

Armanca vê gotare ew e ku hêmanên hevokê û bi taybetî hêmanên hêvokê yên hokerî bi awayekî hûrgilî û rêgezî bêne destnîşankirin û ravekirin. Ji bo vê yekê, me pêşî rêgez, teorî û lêkolînên girêdayî mijarê berhev kirin û analîz kirin. Dûvre, dane ji korpûseke berfireh hatin tomarkirin. Korpûsa me xebata Firat Cewerî ya bi navê *Antolojiya Çîrokên Kurdî* ya sê-cildî ye. Ango, me dane ji korpûseke berfireh kom kirine û mînakên mijarê li gorî mane, binyad û peyvrêziya wê analîz kirine û şayesandine. Li gorî van analîzan çend encamên girîng di vî warî de derdikevine pêş. Gelek maneyên hêmanên hokerî hene. Hêmanên hokerî hevokê ji aliyê cih, dem, pêvajo, merc, sedem, armanc, cexdarî, deontîk, epîstemîk, girêdanî, pirsyarî, şanîdanî û mêjerî ve modîfiyê dikin. Binyada hêmanên hokerî dikare di asta peyvî de, di asta frazî de û di asta hevokî de be. Di asta peyvî de hêmanên hokerî bêtir ji hokeran pêk tên. Di asta frazî de hêmanên hokerî bêtir ji frazên daçekî, navdêrî û hokerî pêk tên. Di asta hevokî de ji hevokên alîkar (subordinate clauses) pêk tên û bi gihanekan re têne bikaranîn.


**Bêjeyên Sereke:** hêmanên hevokê, hêmanên hokerî, maneyên hêmanên hokerî

## Optional Constituents Of Sentences: Adjuncts


**Abstract**

This study is specifically aimed at identifying the forms of adjuncts and the meanings they carry. In order to analyze the data,


---

[*] Ev gotardi sempozyuma bi navê “Dicle Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Lisansüstü Öğrenci Sempozyumu 7-9 Kasım 2023”ê da hatîye pêşkêşkirin

[*] Xwendekarê Doktorayê, Zanîngeha Dîcleyê, Beşa Ziman û Çanda Kurdî, mamostesinan@gmail.com, Orcid: 0000-0001-8562-6018

descriptive-qualitative approach was applied in this research. The data are sentences which contain adjuncts and they were taken from an anthology entitled *Antolojiya Çîrokên Kurdî,* which is consist of three volume and edited by Firat Ceweri̇ (2018). They were collected through library research and then presented informally by providing some examples and elaborations. There are some important points that can be concluded based on the results of analysis. First, adjuncts may appear in many forms, they can appear as a word, as a phrase or as a clause. Phrases forming adjuncts found in this anthology are noun phrases, adverb phrases, and prepositional phrases. Meanwhile, clauses forming adjuncts which appear in this anthology are finite verb clauses, non-finite verb clauses and this clauses appear as subordinate clauses and they are used with conjunctions. Secondly, there are various meanings carried by adjuncts found in *Antolojiya Çîrokên Kurdî*. Adjuncts which denote space or place carry the meanings of position, direction, and distance. Adjuncts referring to time carry the meanings of time position, duration, frequency, and time relationship. Adjuncts showing process carry the meanings of manner, means, instrument. Besides, there are also adjuncts which imply respect, cause, purpose, and concession, additive, substitutive, deontic, epistemic, conditional found in this anthology.

***Keywords***: *constituents of sentence, forms of adjuncts, meanings of adjuncts*

## Cümlenin Yardımcı Ögeleri: Zarf Tümleci, Dolaylı Tümleç

### Özet

Bu çalışmanın amacı cümlenin ögelerini özellikle de zarf tümleçlerini detaylı ve prensiplere dayanan bi şekilde göstermek ve yorumlamaktır. Bunun için öncelikle prensip, teori ve konuyla ilgili araştırmalar bir araya getirilmiş ve analiz edilmiştir. Daha sonra cümle örnekleri kapsamlı bir sahadan elde edilmiştir. Bu kapsamlı kaynak Fırat Ceweri̇'nin editörlüğünü yaptığı ve üç ciltten oluşan *Kürtçe Öykü Antolojisi*'dir. Örnekler, bu çalışmadan alınmış ve zarf tümleci örnekleri anlam, yapı ve cümledeki yeri bakımından incelenmiştir. Bu analizler ışığında konuyla ilgili bazı önemli sonuçlar öne çıkmaktadır. Zarf tümleçleri cümleyi yer, zaman, süreç, şart, amaç, vurgu, deontik, epistemik, soru, gösterme ve miktar açısından etkiler. Zarf tümleçlerinin yapısına gelince şunu söylemek gerekir: Zarf tümleçleri sözcük, tamlama ve cümle formatlarında kullanılabilir. Kelime bazında

kullanılan zarf tümleçleri daha çok zarflardan oluşurken tamlama bazında kullanılanlar daha çok isim tamlaması, edat öbeği ve zarf öbeğinden oluşur. Cümle düzeyindeki zarf tümleçleri ise daha çok yan cümlelerden oluşur ve belirli bağlaçlarla temel cümleye bağlanırlar.

**Anahtar Kelimeler:** cümlenin ögeleri, zarf tümleci, zarf tümlecinin anlamı ve yapısı

## Destpêk

Hevok, amûrek e ku mirov bi xêra wê ramanên xwe îfade dikin. Ji bo ragihandina axiftin û peyaman divê hevok bêne bikaranîn. Hevok, ji hin komên peyvan pêk tên û divê ev komên peyvan maneya hevokê temam bikin. Ev komên peyvan ên ku hevokan pêk tînin pêkhênên hevokê ne (Vardar, 2002: 153). Binbeşa zimannasî ya ku li ser binyada hevokan disekine hevoksazî (syntax) ye. Pêkhên ew hêman in ku hevokê pêk tînin (Vardar, 2002: 153). Hevoksazî li ser pêkhênên (constituents) hevokan hûr dibe, hewl dide diyar bike bê peywira van pêkhênan di hevokê de çi ye. (Parlak, 2023: 56). Ji aliyê hevoksazî ve ev hêman bi giştî ev in: kirde, pêveber, bireser û hêmanên hokerî (Pratama, 2018: 162). Ji van hêmanan, hin hêmanên pêwîst in û hin jê alîkar û hilbijarî ne. Hêmanên bingehîn (core argument) hêmanên pêwîstî ne; kirde, pêveber û bireser hêmanên pêwîstî ne. Haig (2004: 22) ji bo hêmanên hevokê yên pêwîst çend rêgez diyar kirine. Hêmanên hevokê yên pêwîst ji aliyê formên rewşî yên berdest ve têne kesandin. Ji ahenga dem û raweya pêveberê bandorê digirin. Ji pêvajoyên lebatî û tebatî bandorê digirin. Cihekî wan ê diyar di hevokê de heye. Em du hevokan mînak bidin: *Ez aniha pirtûkê dixwînim/ Min doh pirtûk xwend*. Di van hevokan de em dibînin ku kirde (ez, min) pêveber (dixwînim, xwend) û bireser (pirtûkê, pirtûk) hêmanên bingehîn in. Ji rewşa xwerû û tewandî, ji demê (dema niha û ya borî) bandor girtine. Herwiha, di kurmancî de peyvrêziya hevokê bi giştî diyar e: Kirde+Bireser+Pêveber. Li gorî van rêgezan hêmanên hevokê yên pêwîst kirde, pêveber û bireser in. Di mînakan de *aniha* û *doh* jî ji van taybetiyan xwerû ne û cihekî wan ê sabît di hevokê de tune ye, lewre hêmanên hokerî ji van pêvajo û taybetiyan bandorê nagirin. Hêmanên ne pêwîstî jî hêmanên alîkar û em dê wan wekî

hêmanên hokerî (adverbials, adjunct) binav bikin (Kroeger, 2004). Ango, hêmanên hokerî hevokê/pêveberê ji aliyê rewş, dem, cih, mêjer, pirsyarî, dibetî, teqezî, helwesta axêver, nîşandan ve temam dikin. Di piraniya hevokan de, bikaranîna hêmanên hokerî hilbijarî ye. Yanî, gava ku hêmanên hokerî ji hevokê bên avêtin, maneya hevokê xera nabe û hevok ji aliyê rêzimanî ve hêj rast e (Pratama, 2018:163).

**Nîqaş**

Hêmanên hevokê di rêzimanên kurmancî de bi awayekî bipirsgirêk hatine ravekirin. Bi giştî, van rêzimanan mijar bi awayekî kurt şayesandine û hêman dabeş kirine. Lê behsa rêgeza dabeşkirina hêmanên hevokê nekirine. Tenê hêman dabeş kirine li gorî hêmanên bingehîn û hêmanên alîkar. Lê, rêgeza dabeşkirinê bê li gorî çi ye bi awayekî rêbazî rave nekirine. Em dê hewl bidin bi awayekî sade behsa vê mijarê bikin. Ji van hêmanan, hin hêmanên pêwîst in û hin jê alîkar û hilbijarî ne. Hêmanên bingehîn (core argument) hêmanên pêwîstî ne; kirde, pêveber û bireser hêmanên pêwîstî ne. Hêmanên ne pêwîstî jî hêmanên alîkar û em dê wan wekî hêmanên hokerî (adverbials, adjunct) binav bikin (Kroeger, 2004). Ev pêwîstî li gorî mane û cureya lêkerê diguhere. Zanista ku li ser xwezaya pêveberan (predicate), hêmanên bingehîn (core argument) û hêmanên hokerî (adjunct) lêkolîna dike teoriya valensê (valency theory) ye. Li gorî vê teoriyê her lêkerek xwedî valensekê ye. Valensa lêkeran li gorî wê hejmara pêkhênên pêwîst diyar dibe. Ji bo pêveberên ku ji lêkerên negerguhêz pêk tên, tenê kirde pêwîst e (Kroeger, 2004). Ji bo pêveberên gergûhêz jî kirde û bireser pêwîst in. Hin lêker hene ji wan re du-gerguhêz (bi-transitive) tê gotin û ji bo wan kirde, biresera rasterast û biresera nerasterast pêwîst in. Lê hêmanên hokerî (adjunct) ji bo hevokan ne pêwîst in, lê hilbijarî ne (Lyons, 1968).

Herwiha, mijara hêmanên hokerî bi awayekî binîqaş hatiye ravekirin. Lewre, di hin rêzimanan de ev hêman wekî hoker, di hin rêzimanan de wekî têrker hatiye binavkirin. Lê li gorî dabeşkirin û binavkirina hêmanên hevokê, tişta di rêzimanên kurmancî de hatiye kirin, nakokî ye. Wekî me got ev mijara hêmanên hokerî di bin navên cûda de hatiye vegotin. Wekî mînak, gava ku em li rêzimanên kurmancî dinêrin em dibînin ku

piraniya rêzimanên kurmancî hêmanên hokerî wekî hoker an hevalkar binav kirine. Lê ev binavkirin qada têgehên kurmancî têkilhev dike. Lewre, hoker him wekî kategoriyeke peyvan him jî wekî hêmaneke hevokê bi heman navî hatiye ravekirin. Lê, li gorî binavkirina zimannasî divê ji hev cuda bin. Lewre, hoker yek ji kategoriyên peyvan e (Givon, 2001a: 87). Navdêr, rengdêr, lêker, daçek, gihanek, hoker ew beşên axiftinê ne. Ango, gava em behsa cureyên peyvan dikin em behsa hokeran dikin. Wekî mînak, di zimanên ewrûpî de gava ku behsa beşên axiftinê (parts of speech) tê kirin, hingî behsa hokeran (adverbs) tê kirin. Ango di asta peyvî de hoker tê xuyakirin. Lê, di hevoksaziyê de gava ku em behsa hêmanên hevokê dikin em behsa peywirên sentaktîk dikin ku ji aliyê hêmanên hevokê ve têne bicihanîn. Ev jî kirde, bireser, pêveber û hêmanên hokerî ne (Givon, 2001a: 108). Jixwe di zimanên ewrûpî de gava ku hêmanên hevokê tên gotin kirde (subject), bireser (object), pêveber (predicate) û hêmanên hokerî (adverbials, adjunct) têne rêzkirin. Bi gotineke din, hoker cureyeke peyvan e. Bi giştî di asta peyvî de ne û tenê dikarin ji hokeran pêk bên. Lê, hêmanên hokerî (adverbials, adjunct) di asta hevokî de ne û ne pewîst e ku ji hokerekê pêk werin. Hêmanên hokerî dikarin ji hokeran, ji frazên daçekî û navdêrî û ji hevokan pêk werin (Strumpf & Douglas, 2004). Ji ber van sedeman, me di gotarê de ji dêvla hokerê ve hêmanên hokerî bikar anî.

### Nakokiya Rêzimanên Kurmancî

Wekî me li jorê jî diyar kir alozî di rêzimanên kurmancî de di warê binavkirina hêmanên hevokê de heye. Herwiha, alozî di dabeşkirina hêmanan de jî heye. Lewre, em dê li vir hin mînakên van aloziyên rêzimanî ji rêzimanên kurmancî bidin. Mesela, Bilbil û Baran (2008) di rêzimana xwe de hêmanên hevokê wekî du beşan dabeş kirine: hêmanên bingehîn (pêveber, kirde), hêmanên alîkar (bireser, têrker, hoker). Wekî ji vir diyar e di dabeşkirina hêmanên de pirsgirêk heye. Li gorî, rêgezên gerdûnî û teoriya valensê bireser ne hêmaneke alîkar e lê hêmaneke pêwîst e. Badıllı (1965) jî hêmanên hevokê wekî hêmanên bingehîn (kirde, pêveber) û hêmanên alîkar (bireser, têrker) dabeş kirine. Di vir de jî di dabeşkirina bireserê de pirsgirêk heye. Lewre, bireser hêmaneke bingehîn e. Herwisa, di

navbera binavkirina hêmanên alîkar de pirsgirêk di mavbera Bilbil&Baran û Badıllı de heye. Lewre, Bilbil&Baran hêmanên alîkar kirine sê beş (bireser, têrker, hoker) lê Badıllı kirine du beş (bireser, têrker).

Herwiha nakokiyeke din di rêzimanên kurmancî de di vî warî de heye. Rêzimanên kurmancî di mijara binbeşên hêmanên hokerî de ji aliyê hejmar û dabeşkirinê ve li hev nakin. Mesela, Bilbil&Baran (2008) hêmanên hokerî kirine şeş beşan: hokerên rewşî, sedemî, demî, bergehî, mêjerî û çawanî. Yıldırım (2012) jî hêmanên hokerî kirine şeş beşan lê navên wan ji yên Bilbil&Baran cûda ne: Hokerên demî, cihî, çawanî, çendî, pirsyarî, nerênî. Güneri (2018) di teza xwe ya lîsansa bilind de hêmanên hokerî kirine şeş beşan lê bi navên cûda: rêbazî, amrazî, dem û rûwangeh, epîstemîk, deontîk û cextî. Heta niha polînkirina herî somdar ji aliyê Tan (2015) ve hatiye kirin. Tan di rêzimana xwe de cih dide 12 beşên hokeran: rewş, dem, cih, pirsyarî, şanîdan, çendanî, sedemîn, teqezî-erêkirin, neyînî, guman-pêşbinî, dubarekirin bisînorkirin. Wekî ku ji van mînakan diyar e di binavkirin û dabeşkirina hêmanên hevokê, hêmanên bingehîn, hêmanên alîkar, hokeran de lihevkirinek tune ye. Wekî ku Aydogan (2013) di pirtûka xwe de diyar dike di binavkirina têgehên zimannasiyê de rêzimanên kurmancî li hev nakin (Aydogan, 2013: 19).

## 1. Cureyên Hêmanên Hokerî ji aliyê maneyê ve

Hêmanên hokerî di hevokê de hin maneyên diyar radigihînin. Hêmanên hokerî ji peyvek, frazek an hevokekê pêk tên û dikarin pêveber an tevahiya hevokê modîfiye bikin (Nordquist, 2019). Hêmanên hokerî dikarin bi awayekî hilbijarî li hevokê bên zêdekirin da ku hevokê bi maneya cih, dem, sedem, armanc û tiştên din temam bikin (Dixon&Aikhenvald, 2000: 2). Hevokê ji aliyê rewş, dem, cih, pêvajo, têkilî û dijberîyê modîfiye dikin (Pratama, 2018:163). Ji aliyê maneyê vê sêzdeh (13) peywirên hêmanên hokerî hene û herwiha hin binbeşan wan jî hene: hêmanên hokerî yên cihî, hêmanên hokerî yên demî, hêmanên hokerî yên pêvajoyî, hêmanên hokerî yên mercî, hêmanên hokerî yên armancî, hêmanên hokerî yên sedemî, hêmanên hokerî yên cextdar, hêmanên hokerî yên deontîk, hêmanên hokerî yên epîstemîk, hêmanên hokerî yên girêdanî,

hêmanên hokerî yên pirsyarî, hêmanên hokerî yên mêjerî, hêmanên hokerî yên şanîdanî.

**1.1. Hêmanên Hokerî yên Cihî**

Hêmanên hokerî yên cihî hevokê ji aliyê cih/mekan ve temam dikin. Ango, cihê karê ku di hevokê de tê ragihandin diyar dike. Ev kar *li kû*, *ji kû* û *ber bi kû ve* pêk tê? Weke ku ji van pirsan diyar e em dikarin hêmanên hokerî yên cihî bikin sê binbeşan: barûdox (position), beralî (direction) û dûrahî (distance). Barûdox cihê pêkhatina bûyerê diyar dike. Em dikarin bêjin ku ev hokerên barûdoxî bersiva *li kû* yan *li kû derê* didin.

Mînak-1a: *Ez li malê pirtûkê dixwînim.*

Gava em li mînakê binêrin, em dibînin ku hevok ji çar hêmanan pêk hatiye: *ez* wekî kirde, *pirtûkê* wekî biresera rasterast, *dixwînim* wekî pêveber û *li malê* wekî hoker. Gava ku em bipirsin ma *li kû* dixwîne? Bersiv dê *li malê* be. Ango, *li malê* barûdoxa hevokê diyar dike.

Hokerên cihî yên barûdoxî rewşeke statîk dibêjin. Lê hêmanên hokerî yên beralî cih ligel tevgereke bi alîyekî ve dişayesînin. Di vir de tevger û beralî dibe ku bi du awayan be: hedef (goal) û çavkanî (source). Hedef berpêbûnê û çavkanî xala jê derketinê nîşan dide.

Mînak-1b: *Ew bi aliyê sûkê ve dimeşe.*

Mînak-1c: *Ew aniha ji oda mêvanan hat.*

Di mînaka 1byê de *bi aliyê sûke ve*, hevokê ji aliyê cih ve temam dike. *Bi aliyê sûkê ve* wekî cihê hedefê yê karê *meşîn*ê hatiye bikaranîn. Herwiha gava em bipirsin: Ew *bi kû ve* dimeşe? Dê bersiv *bi aliyê sûke ve* be. Loma, di vir de wekî hokera cihî ya hedefî hatiye bikaranîn. Di mînaka 1cyê de, *ji oda mêvanan* hevokê ji aliyê cih ve temam dike. Maneya çavkanî yan xala bûyerê dide hevokê. Gava em bipirsin: Ew aniha *ji kû* hat? Dê bersiv *ji oda mêvanan* be. Ji ber vê yekê, wekî hokera cihî ya çavkanî hatiye bikaranîn.

Hokerên cihî dikarin hevokê ji aliyê cihekî wisa temam bikin ku ji aliyê dûrahiyê ve dikare bê pîvandin. Ango, ev hokerên cihî dûrahiya bûyerê dişayesînin. Gava em ji pêveberê pirsa *çiqas dûr* bikin û pêveber bersiva wê bide hingî bersiv dibe hokerên cihî yên dûrahiyê.

Mînak-1d: Ew sê gavan dûrî min rudinê.

Di vê mînakê de (1d) sê gavan maneya hevokê ji aliyê dûrahiyê ve temam dike. Gava em bipirsin: Ew çiqasî dûrî min rudinê? Dê bersiv sê gavan be. Loma ev hokera cihî ya dûrahiyê ye. Niha em dikarin ji korpûsa xwe hin mînakan ji bo hêmanên hokerî yên cihî bidin.

Mînak-1e: Şewêş li ciyekî rûnişt. (Cewerî, 2018a: 40).

Mînak-1f: Bavê Şewêş hêdî hêdî ji alî newalê de dihat. (Cewerî, 2018a: 40)

Mînak-1g: Di birca bavê wî de heft roj û heft şeva jê re dawet û şahî danîn. (Cewerî, 2018a: 49)

## 1.2. Hêmanên Hokerî yên Demî

Hêmanên hokerî yên demî hevokê ji aliyê demê ve temam dikin. Ango, hêmanên hokerî yên demî pêkhatina dema bûyerê radigihînin û bersivê didin pirsa *kengî*. Hêmanên hokerî yên demî dikarin hin maneyên cûda bidin hevokê: barûdox, mawe, dubarebûn û têkilî. Hokerên demî yên barûdoxî dema pêkhatina bûyerê radigihînin. Ev hoker bersiva pirsa *kengî* didin û demeke statîk diyar dikin.

Mînak-2a: *Ew aniha ji vir çû.*

Di vê mînakê de (2a) *aniha* dema çûnê diyar dike. Gava em bipirsin: Ew *kengî* çû? Dê bersiv *aniha* be. Dema hevokê diyar dike û demeke statîk e. Ango, di carekê de bûye û qediyaye.

Hokerên demî yên maweyî hevokê ji aliyê maweyê ve temam dike. Ango, maweya xaleke demê heta xaleke din diyar dike. Ev mawe him dikare ji rabidûyê ber bi dema axiftinê be him jî dikare ji xaleke demê ya ber bi dahatûyê ve be. Herwiha, hokerên demî yên maweyî dikarin bên pîvandin.

Mînak-2b: *Ez dixwazim heta sê rojan li wir bimînim.*

Mînak-2c: *Ew ji par ve hatiye vir.*

Di mînaka 2byê de heta *heta sê rojan* maweya mayînê diyar dike. Ango, mayîn dê *sê rojan* dewam bike. Gava em bipirsin: Ew dixwaze *heta kengî* li wir bimîne? Dê bersiv *heta sê rojan* be. Loma ev hokera demî ya maweyî ye û ber bi dahatûyê

ve ye. Herçî mînaka din e (2c) *ji par ve* hevokê ji aliyê maweya hatinê ve temam dike. Ango, hatine wî *ji par ve* pêk hatiye û heta aniha dewam dike. Gava em bipirin: Ew *ji kengî ve* hatiye? Dê bersiv *ji par ve* be. Maweya vê ji rabirdûyê ber bi dema axiftinê ve ye. Hokerên demî yên maweyî wekî ku ji hevokên jorîn diyar e bêtir bi hin daçekan re tên bikaranîn.

Hêmanên hokerî yên demî carinan radigihînin bê bûyer çend caran an çiqasî pêk hatiye. Ango, dubarekirina pêkhatina tiştekî diyar dikin. Gava em pirsên çend caran an çiqasî bikin û hevok bersivê bide me hingî bersiv dibe hokerên demî yên dubarekirinê.

Mînak-2d: *Ez rojê du caran çayê vedixwim.*

Di vê mînakê de (2d) *rojê du caran* radigihîne bê vexwarin çend caran/çiqasî pêk tê. *Rojê du caran* pircariya pêkhatina bûyerê diyar dike. Loma, ev hokera demî ya dubarekirinê ye.

Hokerên demî carinan dikarin têkiliya di navbera du xalên demê de ragihîne. Ev cure hoker têkiliya di navbera du pozîsyonên demê de diyar dikin.

Mînak-2e: *Ew jixwe amade bû.*

Di vê mînakê de (2e) *jixwe* têkiliya dema beriya 'aniha' dişayesîne. Ango, ew beriya aniha amade bû û heta aniha jî amade ye. Ango, *jixwe* têkiliya demî ya beriya bûyerê û anihaya bûyerê diyar dike. Niha em dikarin hin mînakên hêmanên hokerî yên demî ji korpûsa xwe bidin.

Mînak-2f: Rîsipiyên gund *herro* wî dibirin mala xwe. (Ceweri, 2018a: 39)

Mînak-2g: *Rojekê* Şewêş *dîsa* diçe ser re. (Ceweri, 2018a: 40)

Mînak-2h: *Berî çend rojan* qelema mink eh bûbû. (Ceweri, 2018a: 44)

### 1.3. Hêmanên Hokerî yên Pêvajoyî

Hêmanên hokerî yên pêvajoyî hevokê ji aliyê rewşê ve temam dikin. Bi giştî bersiva pirsa *çawa* didin. Hêmanên hokerî yên pêvajoyî dikarin maneyên cûda bidin hevokê: rewş, rêbaz, amraz. Hokerên rewşî helwesta kirdeyê ya ji bo kiryarê diyar dikin û hevokê ji aliyê rewşê ve temam dikin. Bi giştî, hokerên rewşî bersiva pirsa *çawa* didin.

Mînak-3a: *Ew hêdîka dimeşe.*

Di vê mînakê de (3a) *hêdîka* rewşa kiryara meşînê diyar dike. Herwisa helwesta kirdeyê jî pênase dike. Gava em bipirsin: Ew *çawa* dimeşe? Dê bersiv *hêdîka* be. Loma, *hêdîka* hokera rewşî ye.

Hokerên pêvajoyî dikarin rêbaza kirdeyê jî diyar bikin. Ango hevokê ji aliyê rêbazê ve temam bikin. Herwekî hokerên rewşî hokerên rêbazî jî bersivê didin pirsa çawa. Ji ber vê, mîna hev in. Lê, yên rêbazî ji helwestê bêtir rêbazê radigihînin.

Mînak-3b: *Ew bi tevgerên destên xwe diaxive.*

Di vê mînakê de (3b) *bi tevgerên destên xwe* rêbaza kirdeyê diyar dike. Yanî, kirde bi rêbaza *tevgerên destên xwe* kiryarê pêk tîne. Gava em bipirsin: Ew çawa diaxive? Dê bersiv *bi tevgerên destên xwe* be.

Carinan ji bo pêkanîna tiştekî amûrek lazim e. Ango, gava kiryar bi amrazekê pêk hatibe hingî dibe hokerên pêvajoyî yên amrazî. Yanî, kirde navgînekê, navgîneke şênber, ji bo pêkanîna kiryarê bikar tîne. Ev cure hoker jî dîsa bersiva pirsa çawa dide. Ji bo diyarkirina hokerên amrazî em dikarin pirsa *bi çi* bikin.

Mînak-3c: *Wê bi desmalekê rondikên xwe paqij dikirin.*

Di vê mînakê de (3c) *bi desmalkê* amraza kirdeyê ya ji bo paqijkirinê diyar dike. Gava em pirs bikin: Wê *bi çi* rondikên xwe paqij dikirin? Hingê dê bersiv *bi desmalkê* be. *Bi desmalkê* maneya amrazî, amrazeke şênber dide hevokê. Hokerên pêvajoyî yên amrazî bêtir bi daçeka *bi*yê tên bikaranîn. Niha em dikarin hin mînakan ji bo hêmanên hokerî yên pêvajoyî bidin.

Mînak-3d: Piştre *bi dengekî kurt û lez* got. (Cewerî, 2018a: 49)

Mînak-3e: Ew ji Erêvanê *bi otobusê* çuye gund. (Cewerî, 2018a: 145)

Mînak-3f: Di wê gavê de derî *bi şidet* vebû. (Cewerî, 2018a: 72).

## 1.4. Hêmanên Hokerî yên Epîstemîk

Hin hoker helwesta axêver ligel rastî, teqezî yan pêkaniya bûyerê nîşan didin (Givon, 2001a: 92). Ango, fikra axêver ji bo rastî, teqezî û pêkaniya bûyerê radigihîne. Ev hêmanên hokerî maneyên rastî, teqezî û pêkanbariya kiryarê dişayesînin. Ev hêmanên hokerî wekî hokerên epîstemîk têne binavkirin. Peyv û frazên *helbet, bêguman, belkî, teqez, ji sedî sed, dibe ku* wekî hêmanên hokerî yên epîstemîk têne bikaranîn.

Mînak-4a: *Belkî îro ew were.*

Di vê mînakê de (4a) *belkî* pêkaniya hatinê diyar dike. Ango, axêver hatina wî/wê pêkan dibîne. Ji ber vê, *belkî* di vê mînakê de hokereke epîstemîk e. Niha em çend mînakên hêmanên hokerî yên epîstemîk rêz bikin.

Mînak-4b: Min *bêguman* dizanîbû ew ê bi tenê here. (Cewerî, 2018a: 55)

Mînak-4c: *Belkî* ji bo me hemiyan, ev şev, li ser axa welêt şevam me a dawiyê be. (Cewerî, 2018a: 73)

Mînak-4d: *Dibe ku* tu jî baş pê bihesî. (Cewerî, 2018a: 366)

## 1.5. Hêmanên Hokerî yên Deontîk

Hokerên ku di hevokê de helwesta axêver ji aliyê nirxdarî, tercîh û daxwazê ve ya ji bo kiryarekê/tiştekî diyar dike. Ango, ev hoker radighînin bê pêkhatina kiryarê çawa bandorê li axêver dike. Pêkhatina kiryarê li gorî dilê axêver e yan na. Hêmanên ku vê maneyê didin hevokê hokerên deontîk in (Givon, 2001a: 93). Di van hêmanên hokerî de nirxandina axêver ya ji bo kiryara pêkhatî heye (Austin, Engelburg&Rauh, 2004). Gotinên wekî *baş*

*e ku, mixabin, nexêr, belê, mala Xwedê ava* hwd. wekî hêmanên hokerî yên deontîk têne bikaranîn.

Mînak-5a: *Baş e ku tu hatî.*

Di vê mînakê de (5a) axêver xwestiye ku kiryara hevokê pêk were. Ango hatina wî kesî bi dilê axêver e. Loma, *baş e* wekî hokera deontîk hatiye bikaranîn. Wekî ji mînakê diyar e hokerên deontîk bi piranî wekî hevokekê tenê bikaranîn. Niha em dikarin hin mînakên din bidin ji bo hêmanên hokerî yên deontîk.

Mînak-5b: *Baş bû* te anî bîra min. (Ceweri, 2018a: 89)

Mînak-5c: *Nebixêr*, lingekî berdîreyî pêşîn şikest. (Ceweri, 2018a: 122)

Mînak-5d: Lê *heyf û mixabin* ku ne yekî ereb bû. (Ceweri, 2018a: 348)

### 1.6. Hêmanên Hokerî yên Cextdar

Hokerên ku maneya hevokê dûpat dikin, hokerên cextdar in. Hêmanên mîna *bi rastî, tenê, qet* vê maneyê didin hevokê (Givon, 2001a: 94).

Mînak-6a: *Ew bi rastî fêm nakin.*

Di vê mînakê de (6a) *bi rastî* maneya hevokê dûpat dike. Ji ber wê hokera cextdar e. Niha em dikarin ji korpûsê hin mînakan bidin.

Mînak-6b: *Bi rastî* jî eva ku hatibû gundê me çi bû? (Ceweri, 2018a: 351).

Mînak-6c: Di serî de kekê min *qet* nexwestibû. (Ceweri, 2018b: 71)

### 1.7. Hêmanên Hokerî yên Sedemî

Hin hevok hene di wan de têkiliya sedem-encamê heye. Ango, tiştek pêk tê û ev tişt dibe sedema pêkhatina tiştekî din. Di hevokên wisa de, tişta ku sedemê radigihîne hokera sedemî ye. Hokerên sedemî bi piranî wekî hevokeke alîkar di risteyê de cih digirin û bi piranî bi gihanekên mîna *ji ber ku, ji bo ku, ji bona,*

*lewra* hwd. re tên bikaranîn. Hokerên sedemî bi giştî bersiva pirsa *çima* didin (Givon, 2001a: 335).

Mînak-7a: *Ji ber ku ew li min qelibî qedeh şikestin.*

Di vê mînakê de (7a) riste ji du hevokan pêk hatiye. Hevoka yekem *ji ber ku ew li min qelibî* ye û hevoka duyem *qedeh şikestin*. Gava em li maneya têkiliya di navbera her du hevoka da binêrin em ê fêm bikin ku têkiliya sedem û encamê heye. Ango, sedema şikestina qedehan li qelibîna wî/wê ye. Herwiha, gava em ji hevoka duyem bipirsin: Çima qedeh şikestin? Dê bersiv *ji ber ku ew li min qelibî* be. Loma, *ji ber ku ew li min* qelibî hokera sedemî ye.

Mînak-7b: *Bona bavê xwe* giriya. (Ceweri, 2018a: 40)

Mînak-7c: *Ji ber ku Yezdan dilê min wek dilên birayên min ê Kurd zexim çênekiriye* ji tiştên biçûk û mezin zû diêşe. (Ceweri, 2018a: 61).

Mînak:7d: Lê ez jî siwar nabim *ji ber ku ma nizanim ku tu Tekş î*. (Ceweri, 2018a: 77)

## 1.8. Hêmanên Hokerî yên Mercî

Di hin hevokan de ji bo pêkhatina tiştekî, pêkhatina tiştekî din hewce ye. Ango, heta ku tiştek pêk neyê tiştê din pêk nayê. Di hevokên wisa de têkiliya merc-encamê heye. Ango, di van hevokan de heta ku merc pêk neyê encam pêk nayê, pêkhatina encamê girêdayî pêkhatina mercê ye. Di hevokên wisa de parçeyê ku maneya mercê dide hevokê hokera mercî ye. Hokerên mercî jî bi giştî ji hevokan pêk tên û bi hin gihanekên mîna *heke, ger, eger, ku* re têne bikaranîn (Givon, 2001a: 331).

Mînak-8a: *Heke baran bibare dê çandinî baş bin.*

Di vê mînakê de (8a) hevok ji du beşan pêk hatiye. Beşa pêşî *heke baran bibare* ye û beşa dawîn *dê çandinî baş bin* e. Beşa yekem merca beşa duyem e. Ango, heta ku baran nebare çandinî baş nabin. Ji bo başbûna çandiniyan hewceyî bi barîna baranê heye. Loma, di navbera her du beşan de têkiliya merc-encamê heye. Heke baran bibare maneyê mercê dide hevokê, ji ber jî

hokera mercî ye. Wekî ku ji vê mînakê diyar e hokerên mercî bi piranî di asta hevokî de ne û bi gihanekan re (heke) tên bikaranîn.

Mînak-8b: *Heke tu deh zêran bidî min* ez ê kurê te rehet bikim. (Cewerî, 2018a: 56)
Mînak-8c: *Heke hingê nehatim*, bizane ku tiştek hatiye serê min. (Cewerî, 2018a: 79)

### 1.9. Hêmanên Hokerî yên Armancî

Hin hevok hene têkiliya armanc-encamê radigihînin. Ango, yek tiştekî dike da ku bigihîje encamekê. Kirde di hevokên wisa de tiştekî dike ji bo ku bigihîje armanca xwe. Hevokên wisa jî ji du beşan pêk tên. Beşa yekem armanc e û ya duyem encam e. Hokerên armancî jî mîna hokerên sedemî bersiv pirsa çima didin. Lê ji aliyê kêşana pêveberê ve cûdahî di navbera wan de heye. Hokerên sedemî ligel lêkerên bi raweyên pêşkerî tên bikaranîn. Lê, hokerên armancî ligel lêkerên bi raweyên daxwazî tên bikaranîn. Herwisa, hokerên armancî mîna yên sedemî bi hin gihanekên mîna “ji bo ku”, “da ku” re têne bikaranîn (Givon, 2001a: 337).

Mînak:-9a: *Ji bo ku hînî kurdî bibe, diçe kursa kurdî.*

Di vê mînakê de (9a) hevok ji du beşan pêk tê. Beşa yeke *diçe kursa kurdî* ye û kiryara ku pêk tê radigihîne. Beşa duyem jî armanca vê kiryara pêkhatî diyar dike. Ango, diçe kursa kurdî bi armanca hînbûna kurdî. Armanca wî ji bo çûyîna kursê hînbûna kurdî ye. Ji aliyê binyad û teşeyê ve mîna hokerên sedemî xuya dike. Lê, wekî me li jorê jî got lêkerên hevokên sedemî bi raweyên pêşkerî têne kişandin. Gava em vegerin lêkera mînaka (7a)yê *qelibî* em dibînin ku kiryar pêk hatiye loma bi raweya pêşkerî hatiye kişandin. Lê, di mînaka (9a)yê de lêkera hînbûnê wekî *hînî kurdî bibe* hatiye bikaranîn, hînbûn ji ber ku hêj pêk nehatiye bi raweya daxwazî hatiye kişandin. Em hin mînakên hokerên armancî rêz bikin.

Mînak-9b: Divê ez xwe bigihînimê *da ku ne ya duhî bîne serê min*. (Cewerî, 2018a: 77)

Mînak-9c: Zû çayekê ji min re dagire *da ez bigihim cemaet û terawîhan*. (Cewerî, 2018a: 89)

### 1.10.Hêmanên Hokerî yên Girêdanî

Hin hevok hene du rewşan radigihînin. Ev hevok ji du beşan pêk tên. Di navbera her du hevokan de maneyên dijberî (concessive), berdêlî (substitutive) û veserî (additive) hene. Ev hoker jî bêtir di asta hevokî de têne bikaranîn û bi hin daçek û gihanekan re têne bikaranîn (Givon, 2001b: 336-337).

Mînak-10a: *Digel ku wî jê hez dikir, jê re nedigot*.

Di vê mînakê de (10a) hevok ji du beşan pêk tê. Beşa yekem rewşeke erênî diyar dike û beşa duyem rewşeke neyînî diyar dike. Ango, di navbera her du beşan de dijberiyek heye. Digel ku tiştekî erênî pêk hatiye, tişta din pêk nehatiye. Hokerên ku vê dijberiyê radigihînin hokerên dijberî ne. Bêtir bi gihanekên mîna *digel ku*, *ligel ku*, *herçend* têne bikaranîn.

Mînak-10b: *Ji dêvla ku bixebite, diçe li televîzyonê temaşe dike*.

Di vê mînakê de (10b) hevok du kiryaran radigihîne. Kiryarek tê hêvîkirin da ku pêk were. Lê ev kiryar pêk nayê. Ji dêvla wê ve kirde diçe tiştekî din dike. Ango, kirde kiryara hêvîkirî nake, di berdêla wê de tiştekî din dike. Ev hoker bi piranî bi gihanekên *ji dêvla ku*, *li şûna ku, ji bilî ku* û hwd. re tên bikaranîn.

Mînak-10c: *Ji bilî ku bixebite, her tiştî dike*.

Di vê mînakê de (10c) kirde dikare tiştên cuda bike. Axêver hêvî dike ku kirde bixebite. Lê, wê nake. Ji bilî wê her tiştî dikare bike û dike. Ango, gava ku ji bo kirde pêkan be gelek kiryarên cûda pêk bîne lê tenê kiryara hêvîkirî pêk newîne hingî hokerên veserî têne bikaranîn. Niha em dikarin çend mînakan ji korpûsê bidin.

Mînak-10d: *Digel derbasbûna deh salan* wisa dilgermî û rûkeniyeke ji dil nîşanî me dabû. (Cewerî, 2018bÇ 88).

Mînak-10e: *Herwekî din jî* ewî mêrî du trimbel bi dû xwe ve hiştibûn. (Cewerî, 2018b: 98)

Mînak-10f: *Herçend ev ne karê min jî be*, tiştê ji destê min bê ez jê re bikim. (Cewerî, 2018a: 418).

### 1.11.Hêmanên Hokerî yên Mêjerî

Hokerên mêjerî pêveberê ji aliyê mêjerê ve modîfiye dikin. Ango, maneya pêveberê ji aliyê mêjerê ve temam dikin. Pêveber dikare ji lêker an rengdêran pêk were, ferq nake. Di vir de tişta girîng ew e ku hoker mêjera pêveberê ragihîne. Hokerên mêjerî ji peyvên *pir, zêde, hindik, hebekî* û hwd. pêk tên û bi giştî bersiva pirsa *çiqasî/çiqas* didin (Payne, 2006: 298).

Mînak-11a: *Hevalê min zêde diştexile.*

Di vê mînakê de (11a) pêveber *diştexile* ye. *Zêde* ji aliyê mêjerê ve maneya wê modîfiye dike. Gava em bipirsin: Hevalê min çiqasî diştexile? Dê bersiv *zêde* be. Yanî, *zêde* maneya pêvebera *diştexile* temam dike loma hokera mêjerî ye. Hin mînak ji korpûsê li jêrê hatine rêzkirin.

Mînak-11b: Dilê min meta xwe *hinekî* digre. (Cewerî, 2018a: 39)

Mînak-11c: Ez *piçek* westî bûm. (Cewerî, 2018a: 40).

Mînak-11d: Wî nema *gelekî* dixwest tev li gund bibe. (Cewerî, 2018b: 46)

### 1.12.Hêmanên Hokerî yên Pirsyarî

Hokerên pirsyarî ji wan peyvên pirsyarî pêk tên. Ango, di hevokê de peyveke pirsyarî hebe û maneya hevokê/pêveberê ji aliyê dem, cih, rewş, mêjer, sedem û hwd. ve temam bike ew dibe hokera pirsyarî. Hokerên pirsyarî maneya hevokê ji aliyê pirsê ve

modîfiye dikin. Peyvên wekî *kengî, çawa, çima, li kû, çiqas* û hwd. wekî hokerên pirsyarî têne bikaranîn. Jixwe, gava me hokerên di hevokê de didîtin me ev pirs dikirin. Îca, gava ev pirs bi xwe di hevokê de hingî maneya hevokê ji aliyê pirsyarî ve temam dikin û dibine hokerên pirsyarî (Payne, 2006: 298).

Mînak-12a: *Ew çawa hate malê?*

Di vê mînakê de (12a) *çawa* wekî peyva pirsyarî hatiye bikaranîn. Peyva *çawa* beriya pêveberê hatiye bikaranîn û maneya wê ji aliyê pirsyarî ve temam dike. Jixwe, pirsa çawa ji bo hokerên pêvajoyî (rewş, amraz, rêbaz) me bikar anîbû. Bersiva pirsa çawa dê her dîsa hoker be û ev hoker dê hokereke pêvajoyî be.

Mînak-12b: *Wî kengî pirtûk xwend?*

Di vê mînakê de (12b) peyva *kengî* wekî peyveke pirsyarî hatiye bikaranîn. Maneya hevokê ji aliyê pirsyarî ve temam dike. Pirsa demê ji hevokê dike. Loma, bersiva vê pirsê dê dîsa hokera demî be.

Mînak-12c: *Ew çima ranazê?*

Di vê mînakê de (12c) peyva *çima* wekî peyva pirsyarî hatiye bikaranîn. Maneya hevokê ji aliyê pirsyarî ve temam dike. Pirsa sedema pêveberê dike. Loma, bersiva wê dê dîsa hokera sedemî be. Hin mînak ji korpûsê li jê re hatine nivîsîn.

Mînak-12d: Ez *heta kengî* rastiyê ji vî xelqî veşêrim? (Cewerî, 2018a: 84)

Mînak-12e: Hûn *li kûderê* bûn? (Cewerî, 2018a: 127)

Mînak-12f: Te *çima* şiêra xwe zû revand? (Cewerî, 2018a: 146)

### 1.13.Hêmanên Hokerî yên Şanîdanî

Hin hoker hene pêvebera hevokê nîşan didin. Ev hêman bi piranî ji hokerên mîna *wisa, wilo, wiha were* pêk tên. Bi giştî, di asta peyvî de ne û beriya pêveberê tên, wê nîşan didin. Lê, di paşxaneya van hokeran de maneya rewşî jî heye. Lewre, bi rêya nîşandanê rewşa pêkhatina pêveberê diyar dikin.

Mînak-13a: *Ew her tim wisa xeber dide.*

Di vê hevokê de *wisa* beriya pêveberê (xeber dide) hatiye û ji aliyê şanîdanê ve modîfiye dike. Gava em bipirsin: Ew her tim çawa xeber dide? Dê bersiv *wisa* be. Ango, *wisa* bi rêya şanîdanê rewşa/awayê pêkhatina xeberdanê diyar dike. Loma, hêmena hokerî ya şanîdanî ye. Em hin mînakên din ji bo vê beşê bidin.

Mînak-13b: Teqnekî *weha* me li hev meyizand. (Cewerî, 2018b: 15)

Mînak-13c: Wî çawan xwest *wisa* jî kir. (Cewerî, 2018a: 133)

Mînak-13d: Madem *wilo* bû, yan tu dê min bikujî yan ez te. (Cewerî, 2018a: 78).

## 2. Binyad û Peyrêziya Hêmanên Hokerî

Hêmanên hokerî di hevokê de dikarin wekî peyvekê, frazekê yan wekî hevokekê bên bikaranîn (Spasić, Babić-Antić&Spasić-Stojković, 2015). Hoker, frazên navdêrî, frazên daçekî, frazên hokerî dikarin di hevokê de wekî hêmanên hokerî bêne bikaranîn. Ji bilî vê, hevokên alîkar jî wekî hêmanên hokerî dikarin bêne bikaranîn. Hevokên alîkar gava ku wekî hêmanên hokerî têne bikaranîn bi gihanekên mîna *piştî*, *berî*, *ji ber ku*, *ji bo ku* saz dibin. Hêmanên hokerî ji aliyê rêza di hevokê de dikarin di serê hevokê de, din ava hevokê de û di dawiya hevokê de bêne bikaranîn. Lê, li gorî cureya hêmanên hokerî meylên cûda hene di vî warî de. Em dixwazin binyad û peyvrêziya hêmanên hokerî di hin mînakan de rave bikin.

Mînak-14a: *Şewêş carna bi alî wê de diçe.* (Cewerî, 2018a: 39)

Di vê mînakê de (14a) *carna* û *bi alî wê de* du hêmanên hokerî ne. *Carna* hokera demî ye û *bi alî wê de* hokera cihî ye. *Carna* di asta peyvî de ye û piştî kirdeyê hatiye bikaranîn. *Bi alî wê de* frazeke daçekî ye û beriya pêveberê hatiye bikaranîn.

Mînak-14b: *Heta êvarê di nav gund de bêdeng digeriya.* (Cewerî, 2018a: 39)

Di vê mînakê de *heta êvarê*, *di nav gund de* û *bêdeng* hêmanên hokerî ne. *Heta êvarê* hêmana hokerî ya demî ye, di serê hevokê de hatiye bikaranîn û frazeke navdêrî ye. *Di nav gund de* hêmana hokerî ya cihî ye, beriya pêveberê hatiye bikaranîn û frazeke daçekî ye. *Bêdeng* hokera pêvajoyî ya rewşî ye, beriya pêveberê hatiye bikaranîn û di asta peyvî de ye.

Mînak-14c: *Her du di tenişta hev de bêdeng diçûn bal aliyê malê ve.* (Cewerî, 2018a: 49)

Di vê mînakê de (14c) *bal aliyê malê ve* hevokê ji aliyê cih ve temam dike. Lewre, hêmana hokerî ya cihî ye. Di asta frazeke daçekî de ye û piştî pêveberê hatiye bikaranîn. Bi giştî hêmanên hokerî beriya pêveberê tên lê carinan hêmanên hokerî yên cihî piştî pêveberê jî dikarin pêk werin.

Mînak-14d: *Piştî ku sunnet û terawîhên xwe bi cih anîn ji ser seccadê rabû.* (Cewerî, 2018a: 84)

Di vê mînakê de (14d) *piştî ku sunnet û terawihên xwe bi cih anîn* hevokê ji aliyê demê ve modîfiye dike. Gava em bipirsin: *Kengî ji ser seccadê rabû?* Dê bersiv ev be: *Piştî ku sunnet û terawîhên xwe bi cih anin*. Ev hêmana hokerî maneya demê dide hevokê û di asta hevokeke alîkar de ye ku maneya hevoka bingehîn ji aliyê demê ve temam dike.

Mînak-14e: *Divê ez xwe bigihînimê da ku ne ya duhî bîne serê min.* (Cewerî, 2018a: 77)

Di vê mînakê de (14e) riste ji du hevokan pêk tê. Hevoka pêşî (divê ez xwe bigihînimê) hevoka bingehîn e. Hevoka duyem (da ku ne ya duhî bîne serê min) hevoka alîkar û armanca kirdeyê diyar dike. Loma hevoka duyem ji hêmana hokerî ya armancî pêk tê û di asta hevokî de piştî hevoka bingehîn hatiye bikaranîn.

Gava em bi giştî li mînakan dinêrin em dibînin ku hêmanên hokerî ji aliyê binyadê ve dikarin di asta peyvî de, di asta frazî de û di asta hevokî de pêk werin. Hêmanên hokerî yên sedemî, armancî, mercî, deontîk û demî bi piranî di asta hevokî

de têne bikaranîn. Di van hêmanan de bi giştî gihanekek heye û hêmana hokerî bi tevahiya hevokê ve girê dide. Hêmanan cihî bêtir di asta peyvî û frazî de ne û bêtir jî frazên daçekî ne. Hêmanên hokerî yên epîstemîk, demî, pêvajoyî mêjerî, şanîdanî bêtir di asta peyvî û frazî de têne bikaranîn, ev fraz bi giştî frazên navdêrî û frazên daçekî ne.

Her çi peyvrêziya hêmanên hokerî ye, bi giştî beriya pêveberê têne bikaranîn. Ango, hêmanên hokerî bi giştî di navbera kirde û pêveberê de têne bikaranîn. Lê, meyla hemû hêmanên hokerî ne wek hev e. Hêmanên hokerî yên cihî gelekî nêzîkî pêveberê ne û carinan piştî wê têne bikaranîn. Belkî di asta peyvî û frazî de tenê hêmanên hokerî yên cihî piştî pêveberê tên. Hêmanên hokerî yên demî bêtir bi awayekî serbest tevdigerin, lê dîsa jî bi giştî beriya pêveberê tên bikaranîn. Hêmanên hokerî yên deontîk, epîstemîk û girêdanî bêtir di serê hevokê de beriya kirdeyê jî têne bikaranîn. Gava ku hêmanên hokerî di asta hevokî de bin hingî em bi hevokeke aloz re rû bi rû dibin. Ango, riste bi tevahî di vê rewşê de ji du hevokan pêk tê. Yek hevoka bingehîn û yek hevoka alîkar e û ya alîkar bêtir wekî hêmana hokerî tê bikaranîn. Di vê rewşê de hêmanên hokerî yên ku di asta hevokî de ne, dikarin bi hevoka bingehîn re cih biguherînin. Ango dikarin beriya pêvebera bingehîn jî werin û dikarin piştî wê jî werin. Wekî mînak, em dikarin li mînaka dawîn (14e) binêrin û vê rewşê dûpat bikin. Li gorî bikaranîna jorîn (Divê ez xwe bigihînimê, da ku ne ya duhî bîne serê min) pêşî hevoka bingehîn (Divê ez xwe bigihînimê) hatiye bikaranîn û dûv re hevoka alîkar wekî hêmana hokerî ya armancî (da ku ne ya duhî bîne serê min) hatiye. Ji ber ku di asta hevokî de ye hêmana hokerî ya armancî em dikarin cihê wê bi cihê hevoka bingehîn biguherînin: *Da ku ne ya duhî bîne serê min, divê ez xwe bigihînimê*. Em dibînim ku cih-guhertina hêmanên hokerî yên hevokî bi vî awayî pêkan e.

## Encam

Piştî van nirxandin û hûrgiliyan em dikarin hin encamên giştî destnîşan bikin:

**1.** Hêmanên hevokê bi giştî ev in: kirde, pêveber, bireser, hêmanên hokerî.

**2.** Hêmanên hevokê wekî hêmanên bingehîn û hêmanên alîkar dibin du beşan. Hêmanên bingehîn (core argument) ji rewşên navdêrî (tewandî-xwerû), ji dema hevokê bandorê digirin. Hêmanên ku van taybetiyan nîşan didin kirde, pêveber û bireser in.

**3.** Hêmanên hokerî ne hêmanên pêwîstî ne, lewre ji hevokê dikarin bên avêtin û maneya hevokê xera nabe.

**4.** Pirsgirêk ji aliyê dabeşkirina hêmanên hevokê ve di rêzimanên kurmancî de hene. Pirsgirêka yekem ew e ku di van rêzimanan de dabeşkirina hêmanên hevokê li gorî rêgez û teoriyekê nehatine ravekirin. Pirsgirêka din ew e ku digel ku bireser hêmaneke bingehîn e di van rêzimanan de wekî hêmaneke alîkar hatiye destnîşankirin. Pirsgirêka paşîn ew e ku hêmanên alîkar wekî têrker û hoker hatine binavkirin. Lê, li gorî van rêgez û teoriyên pêşkêşkirî divê wekî hêmanên hokerî bêne binavkirin. Lewre, hoker kategoriyeke peyvan e, di asta peyvî de û tenê ji hokeran pêk tê. Lê, hêmanên hevokî peywireke hevoksazî pêk tînin, di asta hevokî de ne û ne tenê ji hokeran lê ji frazên navdêrî û daçekî, ji hevokên alîkar pêk tên.

**5.** Hêmanên hokerî, hêmanên alîkar in. Hevokê ji gelek aliyan ve temam dikin. Ji vî aliyî ve 13 cureyên hêmanên hokerî hene: hêmanên hokerî yên cihî, hêmanên hokerî yên demî, hêmanên hokerî yên pêvajoyî, hêmanên hokerî yên mercî, hêmanên hokerî yên armancî, hêmanên hokerî yên sedemî, hêmanên hokerî yên cextdar, hêmanên hokerî yên deontîk, hêmanên hokerî yên epîstemîk, hêmanên hokerî yên girêdanî, hêmanên hokerî yên pirsyarî, hêmanên hokerî yên mêjerî, hêmanên hokerî yên şanîdanî. Herwiha, hin binbeşên van hêmanan jî hene ku me bi hûrgilî rave kirin.

**6.** Ji aliyê binyadî ve hêmanên hokerî di sê formên cûda de têne bikaranîn: asta peyvî, asta frazî (fraza daçekî, fraza navdêrî, fraza hokerî), asta hevokî (hevokên alîkar).

**7.** Hêmanên hokerî yên sedemî, armancî, mercî, girêdanî bi piranî di asta hevokî de têne bikaranîn. Hêmanên hokerî yên

din bi piranî di asta peyvî û frazî de têne bikaranîn. Gava ku hêmanên hokerî di asta hevokî de têne bikaranîn bi gihanekan re (*piştî, ji ber ku, heke, da ku*) têne bikaranîn.

**8.** Cihê hêmanên hokerî di peyvrêziya hevokê de guherbar e. Ango, hêmanên hokerî dikarin di serê hevokê de, beriya pêveberê û piştî pêveberê bên bikaranîn. Lê, li gorî çavdêriyên me hin meylên cûda jî hene. Wekî mînak, hêmanên hokerî yên cihî bêtir nêzîkî pêveberê ne. Carinan beriya pêveberê, carinan piştî wê tên. Hêmanên pêvajoyî, mêjerî, nîşandanî jî bêtir li pêşiya pêveberê cih digirin. Lê, hêmanên hokerî yên deontîk, epîstemîk, girêdanî, demî di serê hevokê de carinan jî piştî kirdeyê têne bikaranîn. Lê dîsa jî ji sedî sed cihekî teqez ji bo hêmanên hokerî tune ye. Ji vî aliyî ve ji hêmanên hevokê yên bingehîn (kirde, bireser, pêveber) serbesttir in.

**Çavkanî / Kaynakça /References**


Aydogan, Îbrahîm Seydo. (2013), *Guman-1, Demnasî, Hevoksazî, Watesazî û Gotar,* Weşanên Lîs, Ankara.

Austin, J & Engelburg S. & Rauh G. (2004), *Current Issues in the Syntax and Semantics of Adverbials,* John Benjamin Publishing.

Badıllı, K. (1965), *Türkçe İzahlı Kürtçe Grameri*, Ankara Basım ve Cilt Evi: Ankara

Bilbil, Mikaîl & Baran, Bahoz. (2008), *Rêzimana Kurmancî*, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Amedê, İstanbul.

Ceweri, Firat. (2018). *Antolojiya çîrokên kurdî.* Stenbol: Avesta.

Dixon, R.M.W & Aikhenvald A.Y. (2000*), Changing Valency: Case Studies in transitivity*. Cambridge University Press: Melbourne.

Givón, Talmy. (2001), *Syntax, An Introduction*, *Volume I,* John Benjamins Publishing

Company, Amsterdam/Philadelphia.

Givón, Talmy. (2001), *Syntax, An Introduction*, *Volume II,* John Benjamins Publishing

Company, Amsterdam/Philadelphia.

Güneri, A. (2018), *Nominal Morfolojiya Kurmanciya Herêma Torê,* Teza Lîsansa Bilind, Zanîngeha Mêrdînê.

Haig, Geffrey. (2004), "*Alignment in Kurdish: a diachronic perspective*". Universität zu Kiel.

Kroeger, P. (2004), *Analyzing Syntax: A lexical-functional approach.* Cambridge Üniversity Press: Cambridge.

Lyons, J. (1968), *Introduction to theoretical linguistics*. Cambridge University Press: London.

Nordquist, R. (2019), *Adverbials: Definition and Examples,* Thoughtco.

Parlak, A. (2023), *Cümlenin Ögelerinin Tasnifindeki Farklılıklar: Yeni Bir Tasnif Yapılabilir mi?* Erzurum Teknik Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Dergisi, 16: 55-72.

Payne, T. (2006), *Exploring language structure: A student's guide*. Cambridge University Press: Cambridge.

Pratama, P. B. (2018), *Forms and Meanings of Adjucnts in James' Fifty Shades of Freed*, Kulturtisk, vol-2 no: 2.

Spasić, D., Babić-Antić, J., & Spasić-Stojković, M. (2015). Adverb or Adverbial Phrases: Structure, Meaning, Function. *Zbornik Radova Učiteljskog Fakulteta Prizren-Leposavić*, *9*, 177–191. https://doi.org/10.5937/zrufpl1509177S

Strumpf, M. & Douglas A. (2004), *The Grammar Bible,* Knowledgeopolis Inc.

Yıldırım, Kadri. (2012), *Kürtçe Dil Bilgisi*, Mardin Artuklu Üniversitesi Yayınları, Mardin.

Tan, S. (2015), *Rêzimana Kurmancî*, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê: Stenbol.

Vardar, B. (2002), *Açıklamalı Dilbilim Terimleri Sözlüğü*, Multilingual Yayınları: İstanbul.

# Di Destanên Gilgamêş û Rustemê Zal de Hêmanên Hevpar

Vehbi TUNÇ*

**Kurte**

Destan; bi hêvî û tirsên xwe, xwezaya mirov û rewşa mirovî nîşan dide. Destan derheqê dîrok û rihê gel, tevgera civakê, rêçûn û rêwîtî, têkilî û cudahiya neteweyan de agahî dide. Destan dewlemendiya çandî ya civakan, têkoşîna jiyanê, afirandina cîhan û mirovahiyê, destkeftiyên lehengên neteweyî vedibêje û bersiva pirs û pirsgirêkên ên di van waran de dide. Destan ruhê gel jî bi rûmet dike û hêzek hestiyarî dide neteweya xwe. (Rosenberg, 2006:15)

Dı vê xebatê de emê di destana Gilgamêş û destana Rustemê Zal de hêmanên havpar bidin berhev. Her du destan binavudeng, bêhempa û kevnare ne. Ji ber ku her du destan jî di heman erdnigariyê de qewimîne û destanên pir navdar in di çend aliyan de dişibin hevûdu. Hatiye dîtin ku di serî de her du destan di aliyên rêwîtî, şerê dêw û ejdeha, alikariya Yezdan, nîv-xwedayî, pêşeng û parêzvanê neteweyan, ezmûna lehengiyê, motifa xewnê û hwd dişibin hevûdu.

Ev xebat xeynî destpêkê ji sê beşan pêk tê. Di destpêkê de derheqê taybetmendiyê destan û lehengan de agahîyek kurtasî heye. Di beşa yekem de agahiyên li ser gelên sumeran, mîtolojî û destana wan a kevintirîn Gilgamêş hatiye rave kirin. Di beşa duyem de li ser Şehname, Firdevsî û destana Rustemê Zal hatiye rawestandin. Di beşa sêyemîn an dawî de di her du destanan de çend şop an hêmanên hevpar hatiye vekolandin.

**Peyvên Sereke:** Destan, Leheng, Gilgamêş, Rustemê Zal, Hêmanên Hevpar

* Xwendekarê Doktorayê Li Zanîngeha Dîcleyê, vehbi_can_25@hotmail.com

**Gılgamış ile Zaloğlu Rüstem Destanlarında Ortak Unsurlar**

**Özet**

Destan; umut ve korkularıyla insan ve insanlık doğasını anlatır. Bir milletin tarihi ve ruhsal yönü, toplumsal davranışları, yol ve yolculukları, ortak ve farklı özellikleri hakkında bilgi verir. Destan toplumların kültürel zenginliği ve hayatî kavgalarını, tanrısal varoluşları, dünya ve insanlığın yaratılmasını, milli kahramanların zaferlerini ve bu alanlardaki soru ve sorunlara cevaplar verir. Destan aynı zamanda millî ruhu yüceltir ve millette duygusal bir güç sağlar. (Rosenberg, 2006:15)

Bu çalışmamızda Gılgamış destanı ile Zaloğlu Rüstem destanında var olan ortak unsurları karşılaştıracağız. İkisi de çok meşhur, benzersiz ve kadim destanlardır. Her iki destan da aynı coğrafyada geçmesi ve çok bilinen destanlar olması nedeniyle birçok bakımdan birbirine benzemektedir. Bu çalışmada yolculuk, devlerin ve ejderhaların savaşı, Tanrı'nın yardımı, yarı tanrısallık, ulusların lideri ve koruyucusu olmak, imtihan, rüya motifi vb. açılardan her iki destanın da benzer özellikler gösterdiği görülmüştür.

Bu çalışma, giriş kısmı dışında üç bölümden oluşmaktadır. Başlangıçta destanların ve kahramanların özellikleri hakkında bilgiler verilmektedir. Birinci bölümde Sümerler, mitoloji ve destanları ile meşhur Gılgamış destanı üzerinde durulmuştur. İkinci bölümde Şehname, Firdevsî ve Zaloğlu Rüstem destanı hakkında bilgiler verilmiştir. Üçüncü veya son bölümde ise her iki destandaki ortak unsurların izleri ele alınmıştır.

**Anahtar Sözcükler:** Destan, Kahraman, Gılgamış, Zaloğlu Rüstem, Ortak Unsurlar

**The Common Parts in the Epics of Gilgamesh and Rustemê Zal**

**Abstract**

The epic, tells about the nature of man and humanity with its hopes and fears. It provides information about the historical and spiritual aspects of a nation, its social behaviors, its roads and journeys,

its common and different characteristics. The epic provides answers to the cultural richness of societies, their vital struggles, their divine existence, the creation of the world and humanity, the victories of national heroes and the questions and problems in this area. The epic also glorifies the national spirit and provides emotional power in the nation. (Rosenberg, 2006:15)

In this study, we will compare the common parts in the Epic of Gilgamesh and the Epic of Rustemê Zal. Two famous, unique and ancient epics. Both epics are similar to each other in many ways because they take place in the same geography. In this study, it was seen that both epics showed similar characteristics in terms of journey, the war of giants and dragons, God's help, semi-divinity, being the leader and protector of nations, heroic test, dream motif, etc.

This study consists of three sections except the introduction. Information about the characteristics of the epics and heroes is given at the beginning. In the first section, the Sumerians, their mythology and epics, and the famous Gilgamesh epic are discussed. In the second section, information is given about the Shahnameh, Firdevsî and Zaloğlu Rüstem epics. In the third or last section, traces of common elements in both epics are discussed and studied.

**Key Words:** Epic, Hero, Gilgamesh, Zaloğlu Rustem, Common Parts

## Destpêk

Di dîrokê de ji berê heta niha gelek şaristanî û lehengên cuda û girîng, deshilatdar bûne û di serdema xwe de serdest mane. Di nava van de bi rastî gelek têkilîyên wekhevî û mayinde çêbune. Di serî van lehengan de Gılgamêş û Rustemê Zal heri girîng û navdar in.

Destana Gilgamêş jî bo ku di cîhanê de destana kevintirîn e û ji bo di aliyên motifan de pir dewlemend e bandorek mezin li ser destan, efsane, çîrok u berhemên devkî an ên nivîskî kiriye û pêwist e bi firehî li ser bê xebitin. Ev bandora mezin li destanên di heman erdnîgarîyê de jiyane wekî Yunanî, Hint û Evrûpaya Bakur kiriye. Kramer, 2014:275). Gılgamêş û Rustemê Zal jî ji ber ku di heman erdnigariyê de jiyane, di nav wan de têkiliyek heye û bandorek mezin li hev kirine.

Ji ber vê armancê wekî li jêr de bi firehî derheqê wan de agahî bê dayîn- Destana Gilgamêş û Destana Rustem di nav gel de sedsalan bi devkî heta serdema me hatine û her du destan jî destanê sirûştî ne û xwedî bandorek mezin in. Gilgamêş destana gelên Sumeran e ku pênc hezar sal di binxeta çemê Dicle û Fıratê de jiyaye. Destana Rustemê Zal- li gor Şehnameya Firdevsî- destanek di nav gelên İranî de nêzîkî du hezar sal berê bi devkî hatiye gotin û di nav gelên rojhilat de bi varyantên cuda heta vê demê hatiye.

Di vê xebatê de em ê di şopa çend lêkolîner û zanyarê wekî Lord Raglan, Joseph Campell, Otto Rott, Rosenberg herin û li ser taybetmendiyê lehengan bisekinin û li gorî van çend hêmanên hevpar bidin berhev.

**Pênasîn û Naveroka Destan**

Di her neteweyan da efsane, çîrok û destanên derasayî hene û ji bo her gel evan tiştan di hişên gelan cihekî mezin digirin. Destan, baweriya gelê berê û niha ye ku ev bawerî bi sedsalan bi taybetmendiyên derasayî di nav civakan de didome.

Destan; bi hewcedarî û daxwazî, hêvî û tirsên xwe cewhera mirov û rewşa mirovahî nîşan dide. Destan riha neteweya, hewcedariya tevgera mirovan, rê û rêçûnê, têkilî û cudahiya neteweya peşkeş dike. Destan bi perspektîfên cuda nihêrîn, dewlemendiya çandî ya civakan, têkoşîna jiyanê, jidayikbûna Xwedê, cîhan û mirovahiyê, destkeftiyên lehengên neteweyî vedibêje û bersiva pirsên di van waran de dide (Rosenberg, 2006:15-18).

Armanca destana ew e ku xwezaya gerdûnê rave bike û li gorî hawîrdora ku tê de ye tevgerek pêwîst bide mirovan. Destan ruhê netewî jî bi rûmet dike û hêzek hestiyarî dide neteweya xwe. Destan ji van pirsan re bersiv jî dide: Ew gel kî ye, kengî ji ku hatiye, serkeftinê wî hene û çine, di astengî û xetereyan mezin de çi rewşê de ma ye, leheng û sembole wî hene an na? Piraniya destana wekî hevpar li ser bûyera lehiyê jî sekini ne û nava wan de cudahîyek pir nîne (Rosenberg, 2006:19).

Cureyên destana jî ev in: A ku bi sedsala di nav gel de bi devkî derbas bûye *destanên sirûştî* ye. Wekî Ramayana, Kalevala,

Nibelungen, Oğuz Kağan, İlyada û Odessea û hwd destanê sirûştî ne. A ku bi deste nivîskarek di demek nêz de hative nîsandin jê re jî dibêjin *destanên çêkirî*. Komediya Xwedayî, Genç Osman, Kaybolmuş Cennet jî destanê çêkirî ne. Çêbûna destana jî bi sê rê ye: serdema çêbûna destanê, serdema belavbûna destanê û serdema berhevkirina destanê (Meretowar, r.24).

Shahab Vali, cûreyên destanê jî wekî mitolojik an neteweyî, dîrokî, olî, rastîn û destanê çêkirî dabeş dike û taybetmendiyê wan bi rêz dike (Vali, 2021:15-22).

Rosenberg jî; destanê wekî sê beş rave dike: destanê afirandinê, destanê bereketê û destanê lehengiyê. Piranî her sê cureyên destanê jî di nav hev de dijîn, lê hinek cuda cuda ne (Rosenberg, 2006:15-18).

**Cudahiya Destan û Mîtolojî**

Destan û mît; afirandina dinyayê, çêbûna mirovan, çîrok û serpêhatiyên derasayî ê lehengan, parastina ax û netewan bi devkî an nivîskî rave dike.

Valî; behsa wate, taybetmendî û cûreyên mît û destana û girîngiya wan ji bo netewan dike. *Mît*, çîrokên afirandinê û hebûnê ne, çîrokên pîroz in. Kesayetên mîta xwedawend in û bûyer piranî derasayî ne. Mît, her dem gotina hêz û îktîdarê dibêje û pêşberî gel e. *Lê destan* bi gelemperî helbestek devkî ê kevnar, vegotinê domdar û xwedî lehengên dîrokî ne. Kiryarên awarte û derasayî di destana de jî hene, lê kêm in. Destan ne pîroz in, lê neteweyî ne, taybetiyên neteweyî nîşan dide. Kesayetên destana mirovên rastîn in an nîv-xwedayî ne. Destan di avabûna hişmendiya gelan de girîng û bingehîn e. Leheng çand, exlaq, nirxên pîroz, azadî, dadxwazî û baweriyên gel ava dike an diparêze. Lehengên destana li hember hêza tarî, dêw û ejderha ne. Lê çavkaniyên herî girîng ji bo destana dîsa mitos in (Vali, 2021:15-22).

**Taybetmendiyên Lehengiya Destanê**

Lehengên destanan bi zêdeyî kurên xwedawend in ku bi awayên nayên fêmkirin ji dayik dibin, xwedî hêzên neasayî ne, di demên dijwar de miletan rizgar dikin û pêşengiyê dikin, bi

cinawiran re şer dikin û wan têk dibin, karên dijwar digirin dest û diçin rêwîtiyên dijwar, gava hewce dike di bin erdê de diçin û bi awayên neasayî dimirin. Lehengên destana xwedî hebûnek xwedayî ne û di demên dijwar de pir caran ji xwedayan piştgirî distînin. (Rosenberg, 2006:15-18)

Lehengên destanê bi gelemperî bi kûjtina cinawiran mirovahiyê xilas dikin û taybetmendiyên derasayî/awarte yên nîv-xwedayî nîşan didin. Li gorî Rosenberg lehengê destana di serdema nûjen de jî ji mirovan mînak in û jî em di bin bandora wan de ne û hê jî jiyana me û niha pir diguherîn in, hê jî bi amûrên sînemayê, roman û şanoyê de di nava me de ye û bi me re dijîn û me dikin bin tesîra xwe. (Rosenberg, 2006:15-20)

Destan bûyerên awarte û girîng in ê ku di jiyana gelan de qewimîne, di hişê wan de bi devkî hatine ragihandinê û bi sedsalan lê hatiye zêdekirin. Hin lehengên dîrokî, di van destanan de bûne awarte û weke lehengên destanê û mitolojik derketine pêşiya me. Mijara destanan çanda gel, şer, lehengî, koç kirin, felaket û xelayî ye. Van bûyerên mezin û ji fêmkirinê dûr di hiş û jiyana gelan de di nav çanda wan de şopên xwe hiştine, bi demê re bi devkî digel motif û sembolên nû cihekî edebî û mayinde girtine, di dema nêz de jî hatine nivîsandine. (Meretowar, r.24)

## Beşa Yekem

## Destana Gilgamêş

### 1.1. Agahî Û Girîngiya Destanê

Gilgamêş ji ber 5 hezar sal berê, ji hemû destana bandortir, binyada dîrok û gelek berhemên olî, civakî û berhemek kevintirîn e. Ji bo hewandina tirsa windabûnê, lehengî, evînî, cinsîtî, nemirî, tofan, qurban û hwd nîşan dide ku hewce ye li ser vê destanê lêkolîne zêdeyî bê kirin. Piraniya dîroknasên klasîk hevbîr in ku Destana Gilgamêş bandorek girîng li ser berhemên wêjeyî û dîrokî kiriye. Destan hem banga me dike hem jî şopa wê serdema 5 hezar sal berê dide nişandan. Di cîhanê de destana yekemîn e ji alî wêjeyê û dîrokî de.

Destana Gilgamêş, cara yekemin di sedsala 19an de di pirtûkxaneya şahê asurîyan Asurbanibal (BZê 668-626) de hatiye dîtin. Destan, nêzîkî xezar sal di nav gelên Sumeran de bi devkî dijî, lê nêzî 4 hezar sal berî dema Akada hinek bi guhertinan û bi destnivîsê mixî li ser herriya qelandî hatiye nivîsandin an neqişandin (Kramer, 2014: 227).

Destan 1500 sal beriya İlyada û Odesa hatîye nivisandin. Rahibek bi nêrînek hevpar ji çend efsaneyan berhev kiriye û B.Z. 2100de dibe ku nivisandibe. Bi Akadî, Hititî û Hurri jî wergerê tabletan hene, lê navê Xwedawenda bi piranî yek in û an ji zimanê Sumerî hatine guhertin. Varyanta destanê a dawî dibe ku Akad/Babîlî be û parçeyên di şûnwaran de hatine dîtin varyantê Akad/Babîlî ne (Rosenberg, 2006: 277-278).

Gilgamêş di salên B.Z. 2700-2500de qralek rastîn e. Tofana mezin jî bi ihtimalek, di serdema B.Z.3000de wekî lehiyek mezin pêk hatibe û di hişên gel de maye û bi guhertinên salan de hatibe heta wê deme. (Rosenberg, 2006: 277-278)

Tê zanîn ku ev destan kevintirîn destan e di cîhanê de û piştî ku Sumeriyan têk diçin û gele Samî wek Akad, Asûr û Babîl tên ser payitehtê ev destan hem diguhere û hem jî destnivîsê destanê bi hezar salan di bin axê de dimîne. Di navbera 1839-1853'an de deqa nivîsarê destanê ya Babîl-Asûr di pirtûkxaneya şahê Asûrê Asurbanipal de bi tesadufî tê derxistin li nav şunwarân de. Lêkolînerê vê arkeolojiye George Smith, Hirmiz Ressam û Austen Henry Layard e. Xeynî van tableta di demê paşî de li çend dewerê din-Anadolu û Mezopotamyayê-jî bi zimanê Akadî (Babiliya kevn), Hîtî, Hûrî jî çend versiyonê destanê hatine derxistin.[79](Evdilfetah, 2019: 11)

Destana Gılgamêş, her hebê 300 rêz û 12 lewhe(dep) wekî helbest hatiye nivîsandın. Destan li ser 12 depên qelandî ye. Her depek şeş latik (sütun)e, li her sê latik li ser rûyekî depê ye, li ser her depekî 300 hev rêz heye. Xwendin ji jorê tê jêr de, ji hêla çepê ber bi rastê ve diçe. Her rêzek wekî beytekî helbestê ye. Bi kurtasî her depek 300 rêz e. Destan piranî bi stranî û bi devkî di nava

79 (Minak: Çend parçe bi zimanê Hurî li nava kavilên Boğazköy…) (li Urukê, Keleha Şerqatê, Zimanê Hitî, hinek ji deste entikafiroşana-li Emerikayê, li Til Hermel, li Filistinê, Li Sultantepe-Harran)

sedsalan hatiye veguhastin û zêdekirin. (Evdilfetah, 2019: 9-36) Danny P. Jackson, biservekirina van agahîyan dibêje ku nivisên bizmarî ji jorê tên jêrê, latikê sêyemîn û çaremin dibin cînarê hev. Her sê latikên pêş ji çepê diçe alî rastê, her sê latikê paş de jî ji rastê diçe alî çepê. Kêmasiye van lewhe pirr in an kêm in û pirrê wan jî nehatine xwendinê û bi çend zimanê din jî hatine nivisandinê. (Jackson, D.P. 2016: XIII)

Serdema Sumeran erka jinan ji ber hêza İştar û Şamşat pir zêde ye (Rosenberg, 2006: 277-278). Yek biryara jiyanê dide yek jî zilam û civakê nûjen dike û diguherîne. Gilgamêş naxwaze bi İştar re bizewice. Li gorê baweriya wê demê Xwedawenda İştar an xwedawenda jin her sal ji bo sê-çar rojan qralek derbasî tîne ser tehtê û dawiyê de wî dikûje, paştir keyayê rastîn vedigere û li karê xwe dinêre. Ji ber vê Gilgamêş naxwaze pê re bizewice, ji ber ku zane we dawiyê de wekî mêrên wê û din bimire an bê kuştin. (Rosenberg, 2006: 277-278).

## 1.2. Derheqê Gilgamêş de

Gilgamêş di nava zincîra şahê Urukê de qralê pêncem e. Ew di navbera salên 3000-2400 B.Z.de yeç Gilgamêş jî di nav salên 2700-2500 B.Z.de jiyaye. 126 sal rêveberiya Urukê kiriye. (Evdilfetah, 2019: 10) Gilgamêş, ji hêla bavî de yeksêka mirov e lê di hela dê de dusêka xwedawend e. Bavê wî Lugalbanda şahê sêyemîn ê Urukê ye, dîya wî xwedawend Nînsun(ga) e. Gılgamêş, dibe ku ew di navbera salên 2800 û 2500 berî zayînê de hukim kiriye û piştî mirina xwe hatiye îlahkirin.(www.wikipedia.org)

Mebesta Gılgamêş, zanîstê bi dest bixe. Ji bo vê mebestê bi şev û rojan digere, çend çiya û çend ezmûnan derbas dike. Gilgamêş; wêrek, bibiryar, bi sebir, bi armanc û têkoşerek jêhatiye. Li pey nemirîyê digere, lê fêm dike ku ji bo mirovan xeynî Utnapiştim nemîrî tune ye. Bi armanca sereke hîn dibe ku hewcedariya mirova encax bi navek baş, jiyanek birûmet re dil şa dibe. Li gorî Rosenberg lehengê piştî Gilgamêş bi vê zanînê dikevin nava tevgerê û pirsgirêk û çareseriya Gilgamêş dipejirînin û di şopa wî da dom dikin. (Rosenberg, 2006: 279).

Lehengiyên efsanewî yên Gilgamêş di pênc helbestên Sumerî yên mayî de hatine vegotin. Ji van ên herî kevn ên ku

dikarin bêne naskirin Gilgamêş, Enkîdu û Welatê Miriyan in. Di vê helbestê de Gilgamêş tê alîkariya Xwedawenda Înanna û li dijî mexlûqên ku êrîşî dara huluppu ya xwedawendê kirine şer dike. Înanna du tiştên nenas ên bi navê mikku û pikku dide Gilgamêş, lê Gilgamêş wan winda dike. Piştî mirina Enkîdu, siya wî ji Gilgamêş re behsa şert û mercên nebaş ên dinyaya bine erdê dike. Helbesta Gilgamêş û Agga, Serhildana Gilgamêş li dijî Qral Agga, yê ku ew jê re girêdayî ye, vedibêje. Dema ku helbestên Sumerî yên din têkiliya Gilgamêş bi Hûvavayê dêw û Buhayê Bihuştê vedibêjin, helbesta dawîn, ku kêm hatiye parastin, mirin û cenazeyê Gilgamêş vedibêje.

Di demên paşerojê yên Babîlê de, van çîrokan dest pê kir ku di nav vegotinek têkildar de bêne bicîhkirin. Destana Gilgamêş, ku bi Akadî ya standard hatiye nivîsandin, belkî ji hêla katibekî bi navê Sîn-lēqi-Unninni ve di Serdema Babîlê ya Navîn de (1600-1155 B.Z.) hatiye nivîsandin û bi pirranî xwe dispêre malzemeyên çavkanî yên kevn. (Jackson, 2016: XV)

Gilgamêş ewqasî tê hezkirin ku, lehengekî îdealîzekirî nîne, çîroka mirovekî rastîn peşkeş dike ku diweste, dilgeşîde dimîne, xemgîn dibe, dilxwaziya navdariyê dike û lê digere, difikire û ditirse. Ji bo vê Gılgamêş ji lehengê din diqete û ne tenê di nav mît û efsaneyan dijî, lê bele di nav jiyanek rastîn de dijî.

## 1.3. Naveroka Destana Gilgamêş

Di destanê de, Gilgamêş wekî nîv-xwedayî bi hêzeke sermirovî ye ku bi mirovê hov Enkîdu re hevaltiyê dike. Ew bi hev re serpêhatî dikin, hem Humbaba (Huvava) hem jî bi Gayê Jor û pîroz ku ji hêla Ishtar ve hatiye şandin, têk dibin piştî ku Gilgamêş pêşniyara zewaca İştar red dike. Piştî ku Enkîdu di encama nexweşiyeke ku ji aliyê xwedayan ve weke ceza hatiye şandin dimire, Gilgamêş dest bi tirsa mirina xwe dike û diçe serdana Utnapishtim a jîr, yê ku kariye ji Tofana Mezin xilas bibe, bi hêviya ku nemiriyê bibîne. Gilgamêş bi çend ceribandinan bi ser nakeve û vedigere bajarê xwe Urukê û fêm dike ku nemirî ji destê wî nayê û nemiriya sereke di vê dinê de sazkirin an hiştina berhemek mayînde ye.

Serpêhatiyên Gilgamêş lewhe bi lewhe bi kurtasi wisa ye:

Lewheya 1.

Gilgamêş di destanê de wek “du-sêyan xwedayî, ji sisiyan yek însanê mirî” tê nasîn. Gilgamêş di destpêka destanê de weke desthilatdarekî zalim tê binavkirin. Her tiştî zane.[80] Ev tê şîrovekirin ku bi giştî hemû gelê xwe neçar dike ku bixebite an jî zordestî li hemû gelê xwe dike. Xelk paşê giliyê xwedayan dikin. Weke cezakirina zilma Gilgamêş, xwedayê Anu bi riya Enki, mirovê hov Enkîdu diafirîne. Piştî ku ji aliyê rahibekî fetan rê -bi navê Şamhat- tê kedîkirin û ji bo ku bi Gilgamêş re rû bi rû bimîne û pê re bikeve pevçûnek Enkîdu dibin Urukê.

Lewheya 2.

Di lewheya duyemîn de her du leheng têdikoşin û ew qas bi hêz û berxwedanek mezin şer dikin, lê dawiyê de her du dibin dostên hev. Di nivîsên Sumerî yên berê de Enkîdu xulamê Gilgamêş e, lê di Destana Gilgamêş de her du hevalên wekhev in û piştî vê pevçûnê dibin hevalên hevûdu.

Lewheya 3.

Di lewheya sêyemîn de heta çaran de, Gilgameş û Enkîdu diçin Daristana Sêdar, ku ji hêla Humbaba ve tê parastin. Mêrxas di heft çiyayan re derbas dibin û digihîjin Daristana Sêdar û dest bi birîna daran dikin.

Lewheya 4.

Gilgamêş û Enkîdu xwe amade dikin ku Humbaba bikûjin. Xwedayê rojê Shamash(Utu) re dia dikin. Utu lava dike ku alîkariya wan bike. Di rê de xeyalên Gilgamêş hene. Enkîdu wan şîrove dike. Gava ku ew têne daristana sêdar, ew diçin ku li Humbaba bigerin. Gilgamêş bi efsuna humbaba dikeve xewê. Lê bi alîkariya Xwedayê Roj Utu tê ser xwe û şiyar dibe.

Lewheya 5.

Di rê de Gilgamêş û Enkîdu ditirsin, lê cesaretê didin hev. Rêya xwe didomînin. Dema ku bi Humbaba re rû bi rû dimînin, Gilgamêş ditirse û ji Şamaş re dua dike. Di encamê de çavên Humbaba kor dibe. Ew û cinawir bi tundî şer dikin. Gilgamêş Humbaba dil digre, Humbaba naxwaze bimire û daxwaza rehmê dike. Gilgamêş di serî de naxwaze Humbaba bıkûje lê Enkidu guh

---

[80] *Ew her tiştî dizane.* (dubarekirina peyvên destanî û berhemên pîroz.)

nade Gilgamêş û bi hev re Gilgamêş û Enkîdu cinawir dikûjin. Dawiyê de her du leheng serê Humbaba jê dikin û vedigerin bajarê Urukê.

Lewheya 6.

Gava Gilgamêş vedigere bajarê Ûrûkê, kesên ku serketina wî seh dikin dilşa dibin. Bi rastî Xwedawenda Îştar jî qehremaniya wî bihîstiye û pê de çûye. Ew pêşniyara zewacê li Gilgamêş dike. Gılgamêş xwedawend İştar red dike, ji ber ku ew deme berê bi mêrê xwe re ne baş bûye. Ji bo tolhildanê, Îştar diçe cem bavê xwe Anu û jê dixwaze, ku ew gayê esman/bihuştê bide wê, ku ew bişîne ser Gilgamêş ji bo wî bikûje. Lê Gilgamêş û Enkîdu gayê bihuştê dikûjin û dilê wî pêşkêşî Şamaş dikin. Dema ku Gilgamêş û Enkîdu bêhna xwe didin, Îştar li ser dîwarên Ûrûkê radibe û nifiran li Gilgamêş dike. Enkîdu ranê rastê yê gayê mirî diçirîne û davêje rûyê Îştar û dibêje: İştar şînê ji bo gayê bihuştê bike. Di vê navberê de, Gilgamêş li ser têkçûna gayê esman pîrozbahiyek li dar dixe.

Lewheya 7.

Enkîduyê ku xewnek pir xerab dîbîne ku xwedayan civiyane û navê wan bêrûmet dikin. Bi daxwaza İştar wan ceza dikin. Ew ji Gilgamêş re dibêje ku yek ji wan wê bimire. Ji ber ku Gilgamêş nîv-xwedayî ye Xwedayan jiyana Enkîdu jê distînin û Gilgamêş bi tene dihêlin. Ji ber vî Gilgamêş dikeve nava şîneke pirr mezin.

Lewheya 8.

Mirina Enkidu valahiyek mezin dixe dilê Gilgamêş. Gilgamêş tiştê ku wî li ser Hevalê xwe Enkîdu gotiye wekî nalînekê tê binavkirin. Li tevahiya bajarê Urukê şîn tên ragihandin. Gilgamêş ji bo Enkîdu peykerek çêdike.

Lewheya 9.

Piştî mirina Enkîdu, Gilgamêş ditirse û difikire ku ew jî mîna wî bimire û li vê dinê nemîne. Ji ber vê rastiya mirinê, Gilgamêş dermanê nemiriyê dixwaze ku aramiyê bibîne û bikeve rêyeke xweş û watedar. Gilgamêş tê ber quntara çiyayekî û di şiklê dûpişkan de rastî mirovan tê. Bi alîkariya wan deriyê çiyê vedike û di tariyê de riya xwe didomîne û digihîje baxçeyekî spehî.

Lewheya 10.

Piştî vê yekê Gilgamêş rêya xwe didomîne û digihîje perava behrê. Ew li wir rastî xaniyek vexwarinê tê. Xwediyê wê der jinek e. Ew jê re dibêje ku ew çi digere. Jinik jê re şîret dike ku dev ji vê rêyê berde, ku tu kes hê nemiriyê peyda nekiriye heta niha û dibêje ku kêfa xwe ji rojên dijî re bîne. Li ser israra Gilgamêş, ew keştîvan nîşan dide ku wî bigihîne Utnapiştimê, yê ku nemiriya yekem û dawî dîtiye. Li ser vê yekê, Gilgamêş dikeve pey keştîvan. Gilgamêş keştîvan dibîne. Xwe amade dikin û bi hev re deryayê derbas dikin. Ew di ava ku mirî tê de dimînin- ku cihekî pir xeternak e- derbas dibin û digihîjin bihuşta xwedayan, ku Utnapiştim tê de nemirîyê dîtiye. Gilgamêş hemû serpêhatiyên xwe ji Utnapiştim re dibêje û dixwaze mîna hevalê xwe Enkidu nemire. Li ser vê yekê, Utnapiştim diyar bike ku ev yek ne mimkûn e, ji ber ku xwedayan nemiriyê daye wî tene û ew ê careke din tiştekî wiha nekin. Her wiha di vê beşê de Utnapiştim behsa bûyera Tofanê ya ku mirov tê de derbas bûye dike. Ew ji Gilgamêş re dibêje ku wî nemirî wergirtiye ji ber ku ew tenê xilas bûye.

Lewheya 11.

Di vê beşê de Utnapiştim bi berfirehî ji Gilgamêş re Tofan çawa bûye, çawa nemiriyê dîtiye dibêje. Di hevdîtinên xwe de, xwedayan biryar didin ku lehiyê derxin û hemû afirandinên wan tune bikin. Ea an Enkî Xwedayê Aqil ji Utnapiştim re rewşê agahdar dike û jê re dibêje ku bi çêkirina keştiyekê malbata xwe û yên ku karibin rizgar bikin. Utnapiştim çi jê ra tê gotin wisa dike. Lehî dest pê dike û şeş roj û heft şevan berdewam dike. Di roja heftan de tofan diqede û ew qurbanî didin. Xwedayê ku biryara lehiyê daye poşman dibin û di berdêla sûcê xwe de nemiriyê didin Utnapiştim.

Piştî vê axaftinê Utnapiştim ezmûna bêxewiyê ya heft rojan dide Gilgamêş. Dibêje ger di îmtîhanê de derbas bibe wê nemiriyê bide wî. Lê Gilgamêş bi ser nakeve, di xew de radibe. Gilgamêş dest vala vedigere lê Utnapiştim bi xwesteka jina xwe dibêje ku ger ew giyaya ciwaniyê di bin avê de bibîne, bi kêmanî dikare dîsa ciwan bibe. Gilgamêş giya dibîne. Lê dema ku ew li ser rê bû, marek giyaya xortaniyê ji Gilgamêş xelas dike û dixwe û çermê xwe nûkirine davêjê. Gilgamêş bi tevahî bêhêvî dibe û bi xemgîniyek mezin vedigere bajarê xwe.

Lewheya 12.

Tiştê ku di vê beşê de cih digire, ji destana Gilgamêş hinek cuda ye. Di vê beşa bi sernavê "Gilgamêş, Enkîdu û bin erdê" de, pûkû û mukkuya Gilgamêş (def û çeng) dikeve binê erdê. Dema ku ew difikirî ku çawa wî derxe, Enkîdu dibêje ku ew ê here û wê bigire. Gilgamêş şîretan li wî dike ku dema ku diçe jêrzemîna cil û bergên paqij li xwe neke, jin û zarokê ku jê hez neke, wan maç neke, yên ku jê hez nake nexe û qaîdeyên bi vî rengî binpê neke, da ku wî li wir negirin. Lê dema Enkîdu dikeve binê erdê, ji ber ku guh nade van qaîdeyan û nikare derkeve, li wir tê girtin. Gilgamêş bi vê yekê pir xemgîn dibe. Ew aciz dibe û ji xwedayan dixwaze ku wî derxin. Yek ji wan alîkarî nake. Lê Xwedawend Ea xewna Enkîdu bi vekirina kulek di binê erdê de derdixe holê. Du heval li wir hevudu hembêz dikin. Gilgamêş jê dipirse ka di binê erdê de çi dîtiye. Her wiha dibêje wî cesedên ku di nava toz û kurm de mane dîtine. Dema ku jê pirsîn: "Te yê bi yek kurî re dîtiye, ew çi dikir?" diyar dike ku ew li ser bizmarê ku di dîwêr de asê mabû digiriya û yê bi heft kuran re di meclîsa Xwedê de rûniştibû. Miriyên wan ên ku li dinyayê kesek tune bû yan jî qurbanî ji wan re nekirin, li erdê digeriyan û bermayiyên wan dixwarin. Dema ku Gilgamêş tiştên ku di bin erdê de qewimîn bihîst, got, "Şunda li wê derê ez ê padîşah bim, ez ê bibûma xulamê erde li vir" û destan diqede.

### 1.4. Sumerî û Mitologiya Wan

Sumerî 3 hezar sal pêşiya zayînê di nava çemê Dicle û Fırat de ku bi navê Mezopotamyayê jiyan e û gelek tiştên nûavakirî icad kirine. Gilgamêş, destana Sumeriya ye ku nêzî 5 hezal sal berê di nav gel de wekî çîrok jiyaye. (Daniels, 2014: 44)

Sumerî, şaristaniyek e ku li başûrê Iraqê berî zayînê di navbera salên 4000-2000an de bi cih bûne û li herêma erdnîgarî ya ku wek dergûşa şaristaniyê an hîva bereketê tê zanîn jiyane û bingeha şaristaniyên bêhejmar danine.(www.wikipedia.com).

Wekî din; nivîsandin, ziman, matematik, olî, mîtolojî û astronomî cara pêşîn li Mezopotamyayê ku Sumeran lê jiyane derketiye holê. Di serdema Sumeran de bi qasî 35 bajar û bajarokên mezin hebûn. Di nav wan de Kiş, Nippur, Lagash, Eridu, Uruk û Ur hene. Meclisa ewil, mektebên ewil, dîroknivîsên

ewil, dîwana yekem, gotinên pêşiyan, tofana yekem, çîroka qiyametê, destana yekem, nivîsa yekem, zagonên pêşîn ên nivîskî, yekem îcadên çandiniyê di vê demê peyda dibe. (Kramer, 2014:5).

Sumerî şaristaniyek hêja de ku serdest bûne di hezarsalan de li erdnîgariyek hişk bi navê Mezopotamya Jêrîn, ku îro ji Iraqê heta Kendava Farisî dirêj dibe, li herêmê dihewîne. Lê tevî van şert û mercên neyînî û nebaş jî, yên ku şaristaniya bilind a yekem a bi navê Baxçeyê Eden'ê afirandine, Sumeriyan in. (Kramer, 1963: 8)

Di kozmogoniya Sumeriyan de ji bo her kirin an tevgerek xwedawendanek heye ji bo wî poli-xwedayî ne. Di serî de Anu û piştre Enlil, wekî vezîrê wî Enki. Xwedawend Utu her tiştî dibine, dad diparêze, ji mirovan re alîkar e. Enki Xwedawende zanîn û avê ye. İanna nişana Stêrka venus e û parêzger an piştevanê evin û şer e. Lê van navê Xwedawendên Sumerê piştî wan di nav Samîyan de (Babîl, Akad, Asûr) bi navên din dijîn. Enki di nav Akada da dibe Ea, İanna dibe İştar, An li Babila dibe Anu**.** (Şahin, 2012:64-70)

**Xweda û Xwedawendê Sumeriyan:**

An/Anu: xwedayê herî mezin e. Di nava 3 xwedayê mezin An-Enlil-Enki de yekemin e. Hejmara wî ya pîroz 60e. Navnasa wî keyayê xweda, xwedayê esmana, xwedayê bajaran e. Li bajarên Ur û Uruk zêde xuya ye. Perestgeha wî E.anna, di wateya perestgeha esmana da ye. Hurriyan jî wî kirine nava mitosa xwe.

**Annuna/ki:** Nêzî 50 hev xwedawend hene. Pêşiya dinya ava bûne û pir birçî mane pir tehdê dîtine. Derheqê wan de gelek tiştên bêbawer hene.

**Anzu:** Di mitolojiya Mezopotamya dı şekle/şêweya *teyrê du serî de ye.*

**Enlil:** Begê cîhanê ye. Di demek kurt de dikeve cihê Anu û dibe xwedawendê sereke. Li gorr hizra Sumeran ê ku keyaya dişîne ser teht û ê ku ji welat ra berekete dişine Enlîl e. Di hemû gelên wê demê de cih digire. Xwedawendek afirîner û bihêz e, edalet û şefkata wî zêde ye.

**Enki/Ea:** Xwedawendê behr u pêhnavan e. Yekî zana ye û biryarê Enlîl tîne cî. Berpirsiyarê nîzama dinê ye. Xwedawendê avê ye û zana û afirîner e. Di panteona Babila de Ea, Şamaş û Marduk sêmendê hêjane ne.

**Ereşkigal:** Di nav panteona Hitita jî derbas dibe. Xwedawendê bin-erdê ye. Di mîtê Babîl de jina Nergal e.

**Dumuzi:** Xwedawendê şivana ye. Di nav panteona Sumeran da du hev Dumuzî hene; yek xwedawendê şivana ye, yek jî di rêza keyayê yekemin ê Urukê ye û masîvan e.

**İanna/İştar:** Xanima Esmana ye. Wekî An, Enlil û Enki mezin e. Bi evînê û şer re têkiliya wê heye. Di nivîs an kîtabeyê Kîşê de İanna keça xwedawenda hivê Nanna ye u xwişka xwedawenda rojê Utu ye.

**Adad:** Xwedawendê Halepê, baran û bahozê ye û bi denge xurmîna esman tê zanîn. Di nav Asur û Babilan de jî navdar e. Wekî Hadad, Hadda jî tê naskirin. Ji xeynî vî Şamaş, Adad û Marduk xwedawanê Babilê ne.

**Lugalbanda:** Kurê Enmerkar e. Di nav listeya keyayê Urukê de di rêza sêyemîn de ye. Mêrê Ninsû ye. Bavê Gilgamêş e. Li Nîppur û Urukê bandora wî heye. Di çend destanê Sumeran de derbas dibe.

**Nanna/Sîn:** Xwedawenda hîvê, bereket û zêdehîyê ye. Hejmara wê 30e. Bi bajarê Urê ve girêdayî ye.

**Utu/Şamaş:** Utu, di nav sumeran da xwedayê rojê ye û mêr e lê di nav Samîyan da wekî xwedawenda jin derbas dibe. Wekî Xwedaye adalete ji tê dîtin. Li mezopotamyayê Utu-Sin-İştar wekî sêmend xuyaye.

Di nav mitologiya Sumeran xeynî Gilgamêş çend destan an çîrokê din jî hene (Şahin, 2012: 70-78). Mîtosên Sumeran ev in: Mîta Dumuzî û Îanna, Mîta Enki ve İanna, Mîta Enki ve Ninhursag, Enlil û Ninlil, Mîta Adap(Adem), Mîta Tofana Sumer/Babil, Mîta Afirandinê.

Li gorî destana Enuma Eliş, jiyan ji avê dest pê dike. Xwedawenda Namnu, erd û esman welidandiye. An li jor e(esman), Enki li jêr(erd) û ji van her du ya Enlil çê bûye.

Destanê Sumeran jî ev in: Destana Gilgamêş û Qralê Kiş Agga, Gilgamêş û Welatê Zindî, Gilgamêş, Enkîdu û Welatê Miriyan, Enmerkar û Xudanê Aratta, Lugalbanda û Destana Enmerkar, Etena û Eagle.

## Beşa Duyem
## Destana Rustemê Zal

### 2.1.Derheqê Rustemê Zal De

Di vê xebatê de zêdeyî di derheqê Rustemê Zal de emê li ser Şehnameya Firdevsî ya fermî bisekinin lê Şehnameya kurdi jî a ku di nav gel de bi devkî bi sedsalan derbas dibe wê bibe mînak û mijarê vê gotarê ji bo danberhevkirina Gilgamêş û Rüstemê Zal.

Firdevsî di Şehnamayê de derheqê şecereya Rustem de wisa dibêje:

*Cihandar zane ku Destanê Sam*
*Mezin e û zana û xweşnav*
*Ev Sam kurê Nerîman bûye*
*Nerîman egîd ji Kerîman bûye*
*Mezin e û bavê wî Gerşasb bû*
*Li dinyayê de padişahê tacdar bû.* (Vali, 2021: 60)

Şecereya Rustem û eşîra wan Eşkanîyan in, li herêma Sîstanê Îranê xwedî hêzek giran bûne. Li gorî Tarîxa Sistan, Gerdîzî û Bel’em, Teberî, Birûnî, Nizamulmulk û Firdevsî şecereya Rustem bi rêz wisa ye: Gerşasb, Kerîman, Nêriman, Sâm, Zal û Rustem, Feramerz û Bîjen. Gerşasp neviyê Cemşid bûye. Ew ji nifşa Keyûmers in. Li gorî Şehnameya Kurdî; Rustemê kurê Zal, kurê Sam, kurê Nerîman, kurê Kerîman(Qehreman), kurê Gerşasb e. Li gor Avestayê Gerşasb wekî *nemir* tê pejirandin û di dawiya dinyayê de bi gurzê xwe wê Zehakê navdar bikûje. Jiyan û serpêhatiyên Gerşasb bi navê

Gerşasbname ji aliye Esedî Tusî jî hatiye nivîskirin. (Vali, 2021: 60-61)

Li gorî Ansîklopediya İslamê Rustem, lehengê herî bihêz ê di destana neteweyî de ya Îranê. Di edebiyata Pehlewî de wek *Rostahm* û *Rostethem* derbas dibe û tê wateya “mezin, xurt”; Carinan bi paşnavê "Tehemten" re di heman wateyê de tê bikaranîn. Bi rastî jî Rustemê Zal di nav navdarên Eşkanîyan de qehremanek e û dema ku ketiye nav destana neteweyî hin taybetmendiyên efsaneyî yên awarte jê re pêvekirin e (TDV, Yıldırım: 2008:294-295)

Li gor Şehnameya Firdevsî, ku agahiyên herî berfireh li ser wî dide, Rustem ji zewaca lehengê neteweyî, Zalê por spî ye. Ji ber ku ew pir mezin bû, nikarîbû welidînê, ji bo Sîmûrgê ku berê bavê xwe Zal mezin kiribû, bi perçekirina zikê diya wî hat dinyayê û bi lez mezin bû û di demeke kin de bedenek gir û hêza mêrek bi dest xist. Rustemê ku hemû jiyana xwe li Zabulistanê bi serkeftî derbas kiriye, dema ku padîşahên Îranê dikevin tengasiyê tê alîkariya wan û gelê Îranê ji xetereyên mezin rizgar dike. (TDV, Yıldırım: 2008:294-295)

Rustem ku bi taybetmendiyên xwe yên curbecur dişibe xwedawendên Hind-Îranî û Herakles û Prometheus ên mîtolojiya Yewnanî, her tim li kêleka qenciyê radiweste û her tim bi ser dikeve, di Îraniya piştî Îslamê de weke lehengê efsaneyî yê herî navdar û herî bibandor cihê xwe girtiye. Di çand û di wêjeyê de jî xwedî cihekî taybet e. (TDV, Yıldırım: 2008:294-295)

Di Şehnameya Kurdî de nivîskar S.Valî, behsa serdemeke zêrîn dike, ku ev serdem berî islamê ye û ji bo diroka kurdi pir girîng e. Lehenga vê serdemê wekî di Şehnameya Firdevsî ji derbas dibe, Rustemê Zal e. Rustem li hemberî dêw, ejderha û dijmina şer dike û her dem -wek bavê xwe Zal- alikariya keyayê Îranê dike û her xetereyan de bi ser dikeve.(Vali, 2021: 13)

Shahab Valî di derbarê Şehnameya Firdevsî/İranê û Şehnameya Kurdî de cudahîyen wan û taybetiyên dûvdirêj agahî dide ku berî îslamê zêdeyî serdema Sasaniyan de hîkayatê şah û keyayan bi devkî wekî rivayeta di nav gel de bi salan domiyaye. Ev kevneşopî piştî islamê jî devam kiriye. Van hikayatên alî Îranê

piştî îslamê di sedsala 11emîn de di bi deste Firdewsî ve tê kom kirin û tomar kirin. Lê di nav Kurdan de wan çîrok-efsane-hikayat an destan bi devkî heta niha didomin û bi guhertoyên cuda tên gotin. Ji ber vî her dû şehname sedî sed ne wekhev in û hinek cudahiyên wan hene. Xalên hevpar pirr in lê ji bo mînak hinek buyêr û lehengîyên Rustem di Şehnameya Îranê de tune ye. Leheng dişibin hevûdu. Lê Şehnameya Firdevsî fermî ye û bi hêzên serdest de alikarî çêbûye yanî di bin kontrola dewletê de Firdewsî amade kiriye. Lê waryantê Kurdî di nav gelen Zagrosê de bi salan azadtir, serbixwe, bê bandor û rasterîn hatiye gotin.(Vali, 2021: 23)

Bandora Rustem hê jî di nav gel de heye. Tiştê herî balkêş ewe ku hê jî gele kurdê iranê li çend cîya xwe bi xwinî wekî zarokên Rustem(Hewramê), wekî Behramê Gûr(Goran), wekî Guderz(Kelhurî) û wekî İsfendiyar/Goştasp(Loran) dibinin. (Vali, 2021: 23)

## 2.2.Lehengiyên Rustemê Zal

Shahab Vali, serdema Rustemê Zal an Şehnameya Kurdî wekî lehengekî neteweyî, serfirazî, rizgarker, efsanewî dibîne. Ew dem serdemeke zêrîn ê û ji bo parastina gel her tim amade ne û li hemberî dêw, ejderha û dijmina şer dikin.[81] (Vali, 2021: 13)

Rustem di xortaniya 14 salî de çend bûyerê lehengî dijî: Çîroka Fîlê Sipî, Çîroka Kûkê Kûhzad û Çîroka Bewrê Beyan. Ji van çîrokan herdû yê paşî tene di şehnameya Kurdî de hene lê di Şehnamye Firdewsî de tune ne. (Vali, 2021: 78)

Rustem gelek lehengiya nîşan dide, gelek ezmûnan derbas dike ji bo bigihîje armanca xwe. Piştî ku Heftxan derbas dike, bi Dîv-î Sepîd re şer dike û wî dikûje, Bîjen ji kaniya Efrasiyab ê ku dişibe Ehrîman rizgar dike, tola Siyaveş distîne, Eşkebus û mîrê serhildêr Îsfendiyar dikûje. Bi nezanî bi kurê xwe Suhrab re şer dike û wî birîndar dike û dibe sedema mirina kurê xwe. Di dawîyê de bi hîleyên birayê xwe Şexad, bi hespê xwe Rexş re dikeve

[81] Her çiqas lehengê pêşîn ên damezrandina kurdan Kawayê Hesinkar be jî Rustem zêdetir berxuya ye lewra Kawa tene di Şehnameya Firdevsî de pir kin derbas dibe û li hember keyayê Ereb-İran Dehhak disekine lê Rustem ji bo İranê û Kurda pir tıştên mayinde bi ser dixe. (Vali, 2021: 45)

kaniyeke tijî tîr û xenceran û jiyana xwe ji dest dide. (TDV, Yıldırım: 2008:294-295)

Rustem di serî lehengiyên xwe de **Fîlê Spî** dikûje. Rojek ev fîl ji zincîrên xwe xelas dibe û erîşî koşka padişah dike. Hemu helk direvin. Lê Rustem diçe pêşiya fîlê û wî dikûje. Hemu kes û Padişah şaş dimînin, Zal acis dibe. Ji ber vê lehengiyê nasnavê Rustem, “Pilten” datînin. (Vali, 2021: 78-82)

Bûyera duyem a **Kûkê Kûhzad** e. Kûkê Kûhzad an keyayê kelehekî ye an dêwek e û ev çîrok di şehnameya Firdevsî de derbas nabe, tenê wek rivayat di nav şehnameya kurdî de dijî. Rojek miroven li bajêr hevarek seh dikin, ku mirovên Kûkê Kûhzad ser bajar êrîş dikin, ji xelkê bac dixwazin û li xelkê zilm dikin. Her kes ditirse, Zal naxwaze, lê Rustem li hemberî wan der tê û diçe cihê Kûkê Kûhzad û serî wî jêdike û tîne bajar ba keya Menucihr. Bi Xêra Yezdan an Xwedê bi serdike. Di pîrê caran alikariya Xwedê heye ji bo Rustem. Menucihr kêfxweş dibe, lê dîsa Zal aciz dibe ji Kurê xwe ji ber ku bê destûr ketîye vê bûyerê. (Vali, 2021: 83-100)

Bûyera sêyem **Bewrê Beyan**, dîsa balkêş e û ev çîrok jî di Şehnameya Firdevsî de tune ye. Li gor Şehnamye Kurdî Bewrê Beyan cilê piling li xwe kiriye. Ya serdema Menucihr an Key Kawus e. Bewr dibe ajalek afirandiyek be jî. Keykawus rojek ji bo cenga Bewrê Beyan mîrov dixwaze lê kes naçe. Lê Rustem dixwaze here vê cengê, Zal dîsa wî naxwaze Lê Rustem bi dizî diçe çiyayê Elbruzê, li wir hespê, ji bo wî ji gaybê hatiye, dibîne û bi mamosteyê xwe Guderz re dikevin rê. Zal jî artêşekî amade kiriye ku here wê cengê. Di rê de leqayî hev tên. Rustem çend caran serdarên Zal dil digre. Rustem sere xwe girtiye ku kes wî naz neke. Zal dixwaze wî hîn bike lê Rustem nabêje. Paşê dibêje ku “Navê min Elbruz e û nifşa min Sam û Zal e. Tu nikarî bi min re şer bikî...” Zal û Rustem jî bi hevre ceng dikin, lê Rustem naxwaze bi bavê xwe re ceng bike. Di carkî de dêwek bi navê Gilim Goş li cem wan peyda dibe, her du li hemberî dêw şer dikin. Zal brindar dibe. Dêw tê kûştin. Dawiyê de Zal û Rustem bi hev re diçin Bewrê Beyan jî dikûjin, çermê wî, ku ti şûr nikare zirar bide, dibe zirxa Rustem. (Vali, 2021: 100-112)

Piştî vana bûyera ezmûna mezin ji bo Rustem dest pê dike. Derbaskirina heft xana ne tenê lehengî û bêtirsî ye. Hêz, sersirûştî, qeder, alîkariya xwedê, parastina gel û xwedîderketina ax e. Leheng Rustem ji bo bigihîje armanca xwe heft astên dijwar pêwist e derbas bike. Van versiyonê Heft xana di destanên Kurdî û İranî de dişibin hev. Heft Xana Rustem bi helbestên Kurdî û pesnê Xwedê dest pê dike. Heft xanayê Rustem bi dorê ev in: (Vali, 2021: 113-174)

Xana Yekem: Cenga Rexş û Şêr
Xana Duyem: Peydakirina Kaniya Avê
Xana Sêyem: Şerê Rustem û Ejdeha
Xana Çarem: Kûştina Jina Cadûger
Xana Pêncem: Dilbûna Ewlad
Xana Şeşem: Cenga Rustem û Erjeng Dêw
Xana Heftem: Cenga Rustem û Dêwê Sifîd

Li gorî Valî, piştî heft xana, Rustem dibe lehengek sereke, pîroz û neteweyî di nav şehnameya Îran û Kurdan de. Rustem êdî kesayetek nîv-xwedayî û keseke pîroz e. Xelata dawîn jî ev e. Hemû lehengî û merhale ji bo vê astê ne. Ax û gelên xwe xelas dike, gelek cinawiran dikûje û di rêwîtiya dijwar de bi serfirazî digihîje armanca xwe.

## 2.3.Derheqê Şehname û Firdevsî de

Şehname di sala 980de bi destê Firdevsî ji çend berhemên nivîskî û çîrokên devkî yên di nav gel de jiyane di nav 40 salî de di dema Sultan Mehmûd de berhev kiriye. Şahname nêzikî 60 hezar beyt e û bi şêweya mesnevî hatiye nivisandin û qala çîrokên keyayan an şahê Îranê dike. Hemû 4 cild e lê Firdevsî, zêdetir li ser bûyerên Rustem sekiniye. (Firdevsî, 4 cilt)

Ji B.Z. hetta Sasaniyan(piştî dema serdariya Ereban)(Pişdadî, Keyanî, Eşkanî, Sasanîyan), Firdevsî sedema nivîsandina xwe di serî de dibêje ku ji çi sûd wergirtiye. Di çar cilda de bi dorê bûyerên epîk û efsaneyî û naveroka vê berhemê bi kurtasî wisa ye: Ji pesnê Xwedê heta afirandina cîhan û mirov û roj û heyv, pesnandina pêxember, serpêhatiya nivîsandina pirtûkê, metha Sultan Mehmûd, serdestiya Kiyumers, fêl û çevnebariya Ehrimen, bûyera Siyamek, Simûrga navdar, dîroka keyayan, Lehengîyên wan, mîtên afirandinê, şer, exlaq, çanda gel,

têkilî û cengên Turan-Efrasyab-Îran, şîret û pend, evînî û hwd ye. (Bingöl, 2021, 7)

Keyayên ku di vê pirtûkê de derbas dibin bi dore wisa ye: Keyûmers, Huşeng, Tahmurs, Cemşîd, Dehhaq, Gave (Kawa), Ferîdun, Sam, Zal, Rustem, Efrasîyab, Minuçehr, Keyqawus, Keyxusrew, Îsfendîyar, Dara, Îskender… Nêzî 50 padîşah tên nasandin û çîrokê wan û derasayî tên gotin. Zêdeyî bi Turan an qralê wan Efrasyab re şerê Îranê tê qalkirin. Efrasyab di destanê pirr derbas dibe, bi eslê xwe ji neteweya Tirk e û lehengek pir mezin e û navê wî yê navdar Alp er Tunga ye.

Firdevsî, ji nû ve dîrok û bawerîya gelê Îraniyan diafirîne û ev berhema wî Şehname wekî “Quranâ Ecem” tê binavkirin. Di Şehnameyê de behsa koka Kurdan jî dike ku Kurd û Îran ji heman cîh tên û ji digihîjin hevûdu (Bingöl, 2021, 7).

## Beşa Sêyem

## Di Destanên Gilgamêş û Rustemê Zal de Hêmanên Hevpar

Li gorî çend lêkolîner û zanyarê kevneşopî û folklorê wekî T.G.Von Hahn, Lord Raglan, Joseph Campell, Rosenberg, Otto Rank çend hêmanên hevpar ê lehenga hene.

Motîf an hêmanên ku bi destanan re girêdayî ne û hevpar in di piraniyên destanan de wekhev in an dişibin hevudu. Ev hêman li gor çend zanyar bi kurtasî wisa ne (Valî, 2021:47-48)(Bingöl, 2021:31-33):

Li gorî T.G.Von Hahn hêmanên havpar ê lehengan 13 hev in. Ji van 6 hev di her du destanan de hevpar in. Li gorî Lord Raglan jî teoriya wî û Lehengê Kevneşopîyê, tîpên bûyerên destana wekhev in û bi pirani dişibin hevûdu. Raglan şablona xwe wekî 22 taybetmendî bi rêz dike û, vê şablonê li ser çîrokên lehengên wek Oedîpus, Herakles, Dîonysos, Apollo, Zeus, Moses (Musa), Joseph (Yusuf) û hwd. nîşan dide. Evan xalan bi piranî li hev tên û hemû leheng bi piranî taybetmendiyê wekhev di zikê xwe de dihewînin. (Bingöl, 2021:33) Ev teorî an nêrîn ji bo

Gilgamêş û Rustem jî li hev tên. Li gorî lêkolîn û rastiya me di navbera Gilgamêş û Rustem de hêmanên hevpar ev in:

### 3.1.Diya Lehenga Prenses An Xatun İn

Diya Gilgamêş Nînsûn ne xatun e lê asta wê zêdetir e. Lewra ew xwedawendekî mezin e. Bavê Gilgamêş Lugalbanda jî qralê Urukê yê sêyemîn e. Diya Rustem jî Rudabe ye bavê wî jî Zal e. Rudabe keça Mihrab e ku ew jî mîrê Kabulê ye. (T.G.Von Hahn û Raglan) Tê dîtin ku ev her du leheng jî ji malbatek bilind an esilzade ne.

### 3.2. Nîşana Bilindbûna Leheng

Gilgamêş û Rustem ji dayikbûna xwe û di xortaniya xwe de elamatê mezin nîşan didin. Tiştên ku tu kes nikare bike bi ser dixin. Rustem her dem li meydanê ye û ji bo şer, ji bo parastinek, ji bo astek, ji bo daxwazek amade ye û ji tiştekî natirse. (T.G.Von Hahn) Gilgamêş jî bi cesareta xwe navdar dibe û çend qonaxê dijwar derbas dike ku tu kes di wan astan de negerîya ye.

### 3.3.Leheng Ji Aliyên Ajalan ve Tên Mijandin an Parastin û Xwedikirin

Enkîdu, di nav ajalan de jiyaye û bi saya rahîbeyek mirovahiyê hîn dibe. Bavê Rustem, Zal jî di bin saya Sîmurg de dijî. Gilgamêş li gor çend zanyaran wekî Çığ ku di dema jidayikbûna xwe de ji aliyê teyrekî tê xelastin. (T.G.Von Hahn) Her leheng ne wekhew be jî dîsa din av ajalan de mezin dibin, fêrî hinek tiştan dibin.

### 3.4.Leheng, Diçin Cihê Biyanî û Bi Awayekî Serfiraz Vedigerin Welatê Xwe

Gilgamêş, diçe daristana Humbaba, wî dikûje û vedigere. Piştre li welatên dûr li nemiriyê digere; Rustem jî çiya bi çiya, bajar bi bajar digere û serpêhatiyên awarte dijî, gelek lehengiyan nîşan dide. Her du leheng jî di dawiya çûndinê de bi serfirazî vedigerin welatê xwe (T.G.Von Hahn)

### 3.5.Ew Dijminan Têk Dibin û Dibin Serdarê Welatê Xwe

Serî heta binî Gilgamêş û Rustem dijminê wekî dêw, ejdeha, ajalên cuda û neyar re şer dikin û ji bo neteweyê xwe dibin xelasker û parêzvan. Gılgamêş di serê çîrokê de dibêje ku bedenê derdora Urukê çêkiriye û ji bo hemwelatiyên Urûkê lehengek hêja û xelasker e. Rustem jî ji bo keyayê Îranê her dem xelasker û serdarek yekemîn e û wekî bavê xwe Zal rêveberê Zubulistanê ye. (T.G.Von Hahn)

### 3.6.Ew Bajaran Rizgar Dikin

Gilgamêş di tableta yekemîn de wekî avaker an sazkerê Urukê ye û derdora vî bajarî bi bedene zexm ava kiriye. Rustem serencama wî mezin ew e ku her tim li her bajarê Îranê amade ye ji bo çêkirin û xelaskirinê. (T.G.Von Hahn)

### 3.7.Asta Dê û Bavê Lehengan

Diya Gilgamêş xwedawendekî ezîz e û diya Rustem jî bakire ye û keça şah Mihrabê ye. Bavê Gilgamêş şah an keya ye û bavê Rustem jî ne şah e, lê ne kesekî piçûk e, pehlewanekî navdar e, navê wî mezin Zal e. (Raglan) Asta her du lehengan pirr bilind û bi rûmet e.

### 3.8.Ketina Zikê Diya Xwe

Gilgamêş di serê çîrokê de ne zelal be jî li gorî M.İlmiye Çığ dibejê ku, bi xêra teyrek hatiye xelaskirin û xwedîkirin wekî ku bavê Rustem, Zal jî bi saya Simurg mezin dibe û bi xêra Simurg jidayîkbûna Rustem çêdibe û bi awayekî derasayî xelas dibe. (Raglan) Çîroka jidayikbûna Gilgamêş di çîroka sedsala duyem a P.Z. de ji aliyê nivîskarê Romî Aelian ve di De Nature Animalium hatiye vegotin. Aelian tîne ziman ku dayika Gilgamêş ji bo ku ducanî nebe ji aliyê bapîrê wî ve di bin nobedariyê de hatiye girtin. Sedema vê yekê ew e ku kahînek jê re gotiye ku neviyê wî dê wî ji dest bavêje. Dayik ducanî dibe û gardiyan zarok ji bircê davêjin xwarê. Dema ku zarok dikeve xwarê, ew ji aliyê ajalekî ve tê rizgarkirin û bi silametî dibin baxçeyekî ku li wir dê ji aliyê baxçevan ve were mezinkirin. (www.wikipedia.org)

### 3.9.Şerê Lehengan bi Dêw, Fîlan û Seketina Wan

Leheng dikevin rêyekî pîroz û di her hêzên efsanewî de rû bi rû dimînin û piştî şerekî dijwar bi wan re, serkeftinek teqez tê bidestxistin (Özgen, 2020: 9). Gilgamêş bi Humbaba, bi şêr û mirovên dupişk û bi gayê pîroz re şer dike. Ne hewce ye ji bo Rustem ku mirov bêje bi kî re şer kiriye an çend şer, çend cinawir, çend dijmin dîtiye, wan kuştiye û bi ser ketiye. Rustem; Fîlê Sipî, Kûkê Kûhzad û Bewrê Beyan têk dibe. Rustem gelek lehengiya nîşan dide, gelek ezmûnan derbas dike ji bo bigihîje armanca xwe. Piştî ku Heftxan derbas dike, gelek cinawiran dikûje, bi Dîv-î Sepîd re şer dike û wî dikûje. Gilgamêş û Rustem di serpêhatiyên xwe de seranserî li hember dêw, hût, an cinavira şer dikin û dibin lehengê bibandor. (Raglan)

### 3.10.Leheng Dibin Qral

Gilgamêş li Urukê şah e, Rustem jî li welatê Turanê 7 sal wekî şah dimîne. Lehengiya her duya jî bi taybetmendiyê xwe dibin şah an qral. Bi serpêhatiyen xwê, bi jîrîtî û mêrxasiyên xwe lê pêş dimînin. Qed natirsin, her dem serdest in û parêzvanê gele xwe ne. (Raglan)

### 3.11. Rêwîtîyên Dijwar

Rosenberg dibêje ku lehengên destanan, karên dijwar digirin dest û diçin rêwîtiyên dijwar (Rosenberg, 2006:15).

Rê tu carî bê meqsed nabe, û li her deverê hêzên efsanewî re rû bi rû dimînin û şer dikin, serkeftinek teqez tê bidestxistin. Di dawiya vê rêwîtiya de leheng ji hêla giyanî û derûnî ve diguherin û dibin xwediyê hêzek mezin. (Özgen, 2020: 9)

Gilgamêş du car bi rê dikeve. Yekemin ew Enkîdu diçin ji bo dara pîroz jêkin û Huwava bikûjin. Şeş roj diçin, ditirsin, dengê Huwawa wekî lehî û erdhêjê ye. Riya duyemin Gilgamêş bi tenê ye û diçe ji bo çareseriya mirinê an nemiriye digere. Rêyek pir dijwar e, gelek bûyer tên sere wî; Sidurî, Urşunabi, Utnapiştim dibîne. Ezmûna xewê ji bo şeş şevan derbas nake. Giyayê nemirîye dema radize marek tê dixwe û civan dibe, Gilgamêş bê hêvi vedigere.

Rustem û Rexş jî ji bo ku bigihîjin asta herî mezin dikevîn rê û xeft ezmûnan derbas dikin. Rustem gellek bûyer û serpêhatiyên lehengî dijî. Ji van bûyerê navdayî Xeftxan e. Di xeftxana xwe de Rustem mecbur e heft asta derbas bike û bigihîje armanca xwe. Heta ku wan ezmûna derbas neke, lehengiya xwe isbat nake û nagihîje konaxa serbilind. Piştî derbaskirina Xeftxan Rustem dibe Rustemê binavudenhg û xwedî cihekî taybet.

Gilgamêş û Rustemê Zal di aliye rêwîtîyê de pir dişibin hevûdu. Rêwitiya wan û serpêhatiyên wan wekhev in.

### 3.12. Alîkariya Xweda

Lehengên destana xwedî hebûnek xwedayî ne û di demên dijwar de pirr caran ji xwedayan piştgirî distînin. (Rosenberg, 2006:15-18) Gılgmış û Rustem pirr caran ji aliyên Xwedava tên parastin. Ev leheng her dem ji Yazdan alikarî dixwazin. Gilgamêş û diya wî Ninsun ji Utu daxwaziya rêwitîyek baş û serfirazî dixwazin û bi ser dikevin. Rustem jî dema ku dikeve tengasiyê û di rîyê xetere de ji xwedayê mezin re dia dike û bi ser dikeve.

### 3.13. Taybetmendiyên Lehengan

Gilgamêş xwedî hêzek mezin e. Di serê destanê de depa yekem de navdar, tund û hêzdar e. Gılgmêş û Rustem bi şekle xwe qirase ne, cusseyê wan pirr mezin e û wekî ga û dêvên qirase ne. (1/1-25) (Maden, 2022:4) Her du leheng jî ji aliyên hûndir de dişibin hevûdu: Gılgamêş û Rustem; pehlawanê aqilmend, şerwanê navdar, nêçirvanê qehreman, bawermendê hêzdar, xwedî hêzek derasayî, egîd û mêrxas, xwedî sembol û xelaskerê netewe û bajar, rêwîyen dijwar, berpirsiyarê netew, nîv-xedayî û wêrek in.

### 3.14. Lehengên Alîkar

Gılgamêş û Enkidu hevalê hevûdu ne. Di beşên serî heta beşên şeşem Gilgamêş û Enkîdu bi hev re ne, hevaltîyek giran di nav wan de heye, heta mirina Enkîdu. Piştî mirina Enkîdu disa ji bo hevalê xwe Gilgamêş digere û li çareseriya mirinê dixwaze. Di çend serpêhatiyen de Guderz carna Rexş di heftxana dawiyan de jî Ewla hevaltiya Rustem dikin. Xewna ku ew divînin rave dikin, bi hev re li hember dijmin şer dikin. Rustem û Rexş di dawîyê de

bi hev re di bîrekî de tên kûştin. Gilgamêş jî di dawiya destanê, di lewheya dozdemin de diçe bin erde û bi Enkîdu re dipeyîve.

### 3.15. Pêşeng û Parêzvanê Neteweyan

Di demên dijwar de lehengê destanan bi pêşengiyek lehengî netewe an gelên xwe rizgar dikin (Rosenberg, 2006:15). Gilgamêş di tableta yekemin de di serê destanê de keyayek xwedî-hêz, bejn-mezin ê surê bajarê çedike û bajarê xwe diparêze. Rustem jî parêzvanê gele Îranîyan e. Her tim Gilgamêş, Zal û Rustem ji bo parastina ax û gele dixebitin. Evan hemû xal/mijaran jor pir an kêm, nêz an dûr di Gilgamêş û di destana Rustem de hatiye xewandin.

### 3.16. Motîfa Xewnê

Xewn motîfek sereke ye û di hemû destan û çîrokan de hevpar e. Leheng bi xêra motifa xewnê agahî li ser pêşeroja xwe hindike. Serî heta dawiyê di her du destanan motifên xewnê zêde derbas dibe. Ev xewn her tim ji aliyê erênî ve tê ravekirin û li gorî van xewnan leheng dikevin nav tevgeran.

### 3.17. Di Destanan de Motîfên Olî

Her çiqas ev her du destan jî ji beriya zayînê ve hene û li nav gel dijîn û tên guhertin, motifên olî di zikê xwê de dihewîn in. Baweriya Gılgamêş bi xwedawendê mezin An, Enkî, Utu, Enlil ê mitolojiyê heye. Rustem her çiqas beriya İslamê jî dest pê kiribe jî, baweriya wî ji Xweda heye û her tim jêre dia dike. Her du leheng jî bi alikariya Xweda di rê û şerê xwe de bi ser dikevin.

### 3.18. Nexwestina Dê û Bav

Diya Gilgamêş her tim piştgirîyê Gilgamêş e û ji bo kurê xwe ji Xwedayê rojê Utu re alikarî dixwaze, lê dema ku diçe daristana Humbaba, Ninsun naxwaze ku ew here lewra naxwaze kurê xwe winda bike. Bavê Rustem jî di lehengiyên xortaniyên de bersivek neyînî dide Rustem, naxwaze Rustem here cengê. Lê ji bo alikariya Keykawus banga wî dike û dixwaze here wan xelas bike.

### 3.19. Buyerên Derasayî

Lehengên destanan xwedî hêzên neasayî ne (Rosenberg, 2006:15). Her çiqas Gilgamêş û Rustem lehengê rastîn vin û ne di kesên mîtan vin jî bûyerên ku dijîn pirr awarte ne, tiştên bi ser dixin derasayî ne û digihîjîn asta herî mezin û wekî xwedayî tên pejirandin.

### 3.20. Astengiya Dêw û Ejderha

Lehengên destanan bi cinawiran şer dikin û wan têk dibin(Rosenberg, 2006:15). Gilgamêş û Rustem jî di serpêhatiyên xwe de seranserî li hember dêw, hût, an cinavira şer dikin û dibin lehengê bandorker. Astenga mezintîrin ev ajal in. Leheng dema ku ji wan ajalan bitirs in nikarin derkevin rê û nikarin bigihîjin armanca xwe.

### 3.21. Bandora Jina

Serdema Sumeran erka jinan zêde bûye. Hêza İştar û Şamşat pirr girîng e. Yek biryara jiyanê dide yek jî zilam û civakê nûjen dike, diguherîne. Ji sedema qûrbankirina meran, Gilgamêş naxwaze bi İştar re bizewice. Li gorê baweriya wê demê Xwedawenda İştar an xwedawenda jin her sal ji bo sê-çar rojan qralek derbasî tîne ser tehtê û dawiyê de wî dikûje, paştir keyayê rastîn vedigere û li kare xwe dinêre. Ji ber vê Gilgamêş naxwaze pê re bizewice, ji ber ku zane wê dawiyê de bimire an bê kûştin. (Rosenberg, 2006: 277-278).

### 3.22. Xwedî Agahiyan

Gilgamêş her tiştî zane, di her alî de xwedî hebûnek mezin e. Tiştê beriya Tofanê jî, her tiştî dîtiye û ji her tiştî sud wergirtiye. Di her tiştî de zana bûye, tiştên veşartî, tiştên diyarî, her tiştî zana ye.

*Ew e, yê ku her tiştî dît( heta tixûbên) cîhanê*
*Ew e, yê ku her tiş nas kir her tiştî sûd girt*
...
*Seydayê pendeyarîyê yei Di her tiştî de zanyar bû*
*Razine nehin dîtin û tiştinê veşartî diyar kirin*
*Û nûçeyên, ji berî dema Tofanê, ji me ra anîn*

(Depê Yekem/Latika Yekem-Nînova-Deqa Babil-Asûrî)

Di destana Rustemê Zal de ji alîyê agahiyek mezin de bavê Rustem watedar e. Ji ber ku li ber destê Simurg jiyaye derheqê her tiştî de zana ye. Sîmurg her tiştî hinî wî kiriye.

### 3.23. Niv-xwedayî

Wêkî li jor hatibû ziman, lehengên destanan bi giştî zarokên xwedayî ne ku bi awayên nayên fêmkirin ji dayik dibin (Rosenberg, 2006:15). Gilgamêş di sere destanê de li ser teht runiştîye û di destanê de derheqê jiyana wî zaroktiye nayê zanîn, lê destan li ser dê û bavê wî disekine. Gilgamêş, ji aliyê diya xwe xwedawend Ninsûn de nîv-xwedayî ye. Ji alî bav de qıralê Urukê yê sêyemîn Lugalbanda jî nîv-mirovî ye.

Rustem jî wek Gilgamêş nîv-xwedayî tê dîtin. Li gori rivayata dê û bavê Rustem, Zal û Rûdabe neviyê Dehhak/Zehak in. Ji bo ku Dehhak xwedî hêzek şeytanî ye dêw ejdeha kes nikare wî bikûje Rustem jî dibe wek nîv-xwedayî. Ev hêzên her du lehengan jî ji nîw-xwedayîya wan tê. (Vali, 2021: 69)

### 3.24. Bûyerên an Çîrokên Şahan

Gilgamêş û Şehname, her du destan jî serpêhatiyen qrala dibêjin. Bi sedsalan çî dîtine, çi kirine, bav û kalanê wan çi çewa jiyane. Bi ser navê şahan de çîroka dirêj kirine, guhertine û bi devkî ji wan meseloka hez kirine. Gilgamêş di nav gel de bi devkî nema ye lê Rustem hê jî di nav gel de zindî ye û bi waryantê curbecur tê zêdeyî li deverên Rojhilat tên gotin.

### 3.25.Ezmûna Lehengîyê

Her leheng bi ezmûnek dibe lehengê mezin. Ger ezmûn an imtihanek tune be kes xwe nîşan nade. Ezmûn lehenga dide pêş. Kî jîr kî jêhatî be dîyar dike. Ezmûna her du lehenga jî mezin in. Gilgamêş di çend ezmûna de derbas dibe. Kûştina Humbaba ezmûnek lehengî ye, çundin û lêgerîna nemirîyê ezmûnek e, ji bo gihîjtina nemirîye daxwaza xewna 7 şeva ezmûnek e, çundina Gılgamêş bin erdê û dîtina wê der ezemûnek e. Evan ezmûnan ji bo pêşkeşiya navekê nemiriye ye. Gilgamêş û Enkidû dixwazin navek navdar bihêlin.

Ezmûna Rustem jî girîng e. Rustem dikeve ezmûnek lehengîyê. Ev lehengî ji bo gel an netewe ye. Ezmûna Rustem ji xeft asta pêk hatiye û pir dijwar e. Ger leheng bigihîjin asta dawiyê û wegerin digihîjin asta herî bilind û armanca wan a sereke jî ev e. Gilgamêş nagihîje vê astê lê Rustem heft xana darbas dike û digîhîje asta herî dawî.

## Encam

Dema mirov dîrokê binirxîne, ji berê heta niha gelek leheng û şaristanê cuda dibîne û hîn dike ku di nava van de gelek têkilî çêbûne. Di serî van lehengan de Gilgamêş û Rustemê Zal zêde girîng û navdar in.

Em di vê xebatê di li ser destana Gilgamêş û Rustemê Zal de li hêmanên hevpar geriyan. Du destanê navdar: Gilgamêş û Rustemê Zal. Gelek bûyerên ku hatine serê Gilgamêş, hatine sere Rustem jî. Ji ber ku her du leheng jî di heman erdnigariyê de jiyane, di nav wan de di aliye neteweyî, lehengî û motifên xewn û nemiriyê, nîw-xwedayî û rêwitîyê de çend hêmanên wekhevî hatine dîtin. Rêwîtîya wan, ezmûnên wan, astengiyên wan, taybetmendiyên wan di nav têkiliyek nêz de ne. Her du leheng jî ji bo naskirin û gihîştina bi navudengekî dijîn. Ji bo vê armancê yek dikeve riyekî dijwar û dixwaze keyayê xwe xelas bike, yek jî dikeve riyekî pirr xetere û diçe ji bo xwe û gele xwe bi giyayê nemiriye xelas bike. Gilgamêş li nemiriyê digere û nabîne, lê hîn dibe ku nemiriya mirovan ew e ku li vir berhemek mayînde bihêlin. Rustem jî ji bo navek bandorker bihêle û bigîhîje astekî bilind derdikeve rê û digihîje armanca xwe ya herî bilind, bi dijmin re şer dike, dêw û ejdeha dikûje û digihîje asta herî mezin.

Lêgerîna nemirîye lêgerîna hundurîn e. Mirov çi bike ji xwe re dike, başî jî nebaşî jî te re ye. Gilgamêş û Rustem bi rastî li xwe digerin. Wekî her leheng heta wekî her mirov li rasti û nasnameya xwe digerin. Rêwîtîya mezin û mayinde xwenaskirin e. Mirov here kuderê li xwe digere. Ev lêgerînek pîroz e, neteweyî ye, watedar û gelek girîng e. Ev lêgerîn, ezmûn û rêwîtiyek pêwist e. Armanc ew e ku bi nêrînek kûr ev mijar were kolandin û kêmasiyên di vî warî de were tijekirin.

**Çavkanî / Kaynakça /References**

Bingöl, F. (2021). *Di edebiyata Kurdî de wek lehengek mitolojik Rustemê Zal,* Teza Mastir, Zaningeha Muş Alparslan, Muş.

Daniels M. (2014). *Bir Nefeste Dünya Mitolojisi*. İstanbul: Maya.

Deham E. (2019). *Destana Gılgamêşî,* İstanbul: Wardoz.

Firdevsî. *Şehname*. (Wer: Necatî Lugal, Kenan Akyüz), MEB Yay. Pdf.

Jackson, D.P. (2016). *Gilgamêş Destanı,* (Wer: Ahmet Antmen). Arkadaş Yayınları

Kramer, S. N. (2014). *Tarih Sümer'de Başlar*. İstanbul: Kabalcı

Kramer, S. N. (1963). *The Sumerians, Theri History Culture and Character*. Chicago.

Maden, S.(Wer.) (2022). *Gılgamêş Destanı,* İstanbul: Türkiye İş Bankası Yayınları,

Meretowar, A. *Hunera Axaftina Xweş û Nivisandina Rind*: İstanbul: Berdan Matbaacılık

Özgen M. K. (2020). *Gılgamêş Destanında ve Mistisizimde İçsel Yolculuk,* Erciyes Üniversitesi, KARE- Sayı / Issue: 9 Yaz / Summer.

Rosenberg, D. (2006). *Dünya Mitolojisi-Büyük Destan ve Söylenceler Antolojisi*. Ankara: İmge Kitabevi,

Şahin, H. A. (2012). *Mitoloji ve Din*. Anadolu Üniversitesi Yayını No:2522. 4.Bölüm. ss.62-78

Vali, S. (2021). *Şehnameya Kurdî Rustemê Zal û Heft Xana Wî,* Weşanxaneya Avesta.

Yıldırım N. (2008). *Türkiye Diyanet Vakfi İslam Ansiklopedisi* (TDV), c.35. İstanbul.

https://tr.wikipedia.org/wiki/G%C4%B1lgam%C4%B1%C5%9F 15.05.2024